

Me d'vê bibêjiya dilberê, bêt û li uslûba berê
Lê kifş bibît û j'pencerê, xef çî û bê teşbîhê ba

Şox û şepala meyperest, ew zalima hişyar û mest
Vê name xef dey vi dest, *fî teyyiha nesru'n-neba*

Bêje şirîna surperî, durdaneya ez muşterî
Kan 'ehd û peymana berê, bê fayde çûn teşbîhê ba

Neyşekera spîdest û zend, zanim mecalê name xwend
Lêvan tebessum kir ji qend, maset kevanî bê ruba

Dilber mecala name dî, nasî ku nîşana me dî
Nûnek muxalif tê nedî, *hel qelbuha nehwî seba*

Qasid bi meqsûda me hat, pur-mujde û emr û berat
Nîşan hinarin hem xelat, şehzadeya gulgûn-qeba

Îro mecal wê hat û wext, dîsan cuwanbû min dirext
Ew lami'a dayî ji text, *ma kane berqen xulleba*

Selwa-rewan zerrînwereq çîçek **Melê** dîn sed neseq
*Yaqûtuha yuhkî'ş-şefeq yehwî 'uqûden kewkeba*

## 6

Dilber şikîna şekerek *fe qultu ya rûhî meta*
Go min heta xatir hebit min go çi kem ez ya heta

Zulfan tu bes çîn çîn bike biskên muqabil dîn bike
Pêşkêşî yek zulfêt te bin mulkê Xeten textê Xeta

Dil bendê dama zulfekî keftî kemenda ulfekî
*Hel fî yedî'l-meftûni şey ew keyfe esne' ya feta*

Zulfên but û şîrînleban jehrî ne şubhet 'eqreban
Lê min ji biska purgireh îro tinê girtin du ta

Nisbet perî zîba ye ew, wek nêrgiza yekta ye ew
*Ya men rea xillî fe hel yuşbî bi şey'in qameta*

Me j'buxçeya yar ziynetê, bêpirs **Melê** destek çitê
*We bi ma ceneytu cenyetî elqet 'eleyye cînayeta*



Dileriz eski minval üzre gelsin de söyleşsin bizle dilberimiz
Bir an gelip görünse pencereden geçse bir rüzgâr gibi

O zarif ve şuh meypereste, gâh ayık, gâh sarhoş olan o zalime
Götürüver gizlice, hâlimizden haber veren mektubumuzu

Talibi olduğum o perimisal inci tanesine söyle
Hani verdiği o eski sözler, hepsi gitti boş yere

O şeker kamışı endamlı, beyaz narin elleriyle açıp okuyunca mektubu
Tatlı bir tebessüm belirdi dudaklarında, titreşti ban ağacı gibi

Görünce dilber mektubu, mührümüzden anladı bizden olduğunu
Görmedi hiçbir muhalif nokta, bilmem gönlü meyletti mi bana

İstediğimiz şeyle döndü elçi, müjdelerle, emir ve fermanlarla
Nişanlar, hediyeler gönderdi bize o gül kaftanlı şehzade

Vakit erip fırsat doğdu bugün, gençleşti vücud ağacı yine
Sevgili canibinden parıldayan o şimşek aldatıcı değilmiş meğer

O servi gibi salınan, o altın yapraklı çiçeği, yüz tarz ile gördü **Mela**
Kızıl bir şafağı andırır yakutları, gerdanlığı yıldız salkımıdır âdeta

## 6

Tatlı dilli dilber vuslat vaad edince bana; ne zaman diye sordum
Dedi; hatırıma gelince. Dedim; neylerim bunca beklemeyle

Yeter zülüflerini halka halka yapıp kâküllerinle çıldırttığın
Huten mülkü ile Hıta tahtı bir tek zülfüne feda olsun senin

Zülfünün tuzağına düşmüş gönül, takılmış bir ülfet kemendine
Aşka meftun olanın elinden ne gelir? Ne yapabilirim ki ey dost

Şeker dudaklı güzellerin zülüfleri, akrep gibi zehir taşımada
Bugün çok düğümlü kâkülden sadece iki tel alabildim

Perilerden daha güzeldir o, elif-misal bir nergisdir o
Ey görenler söyleyin, sevgilinin endamına benzer mi hiçbir şey?

Yârin narin bağına destursuz bir el değer mi **Mela**?
Cinayetlerle suçladı beni, kopardığım o bir tane yüzünden



## 7

Bi narê firqetê sotim ji ferqê ser heta pê da
Xedenga xefletê nohtim ji berqê lami'a lê da

Xedenga firqetê re'd e dilê ew xefletê lê dit
Dibêjim er cebel bîtin bi ker bit wê di gavê da

Heçî firqet nedî hicran, nebê min dax wê li sîne
Ji beri derbê di hicran û fîraqê rûh û can kê da

Ji derbê dax û bêderdî mepirsin mihneta 'işqê
Çi zanin bêxeber jana dilê dax û keser tê da

Kesê mihnet dî firqet, vexwarî cer'eya hicrê
Giryê wan tê bi halê min di vê hicran û zecrê da

Bi dama muhbetê bend im xedenga firqetê dil nuht
Bi şubhê murxê nîmbesmil [d]i hev wertêm di xwûnê da

Birûska batinî da dil di pêtê sîne wê wer bû
Kû dê bêtin çi halî dil di nav nar û di pêtê da

Ji ulfê şubhetê zulfê medam lew bêqerar im ez
Ku canê min 'ezîz îro wekî dil çû di ulfê da

Ji mehbûb dûr kirim çerxê felek wê pur hilavêtim
Nizanim dê li kû dit min di vê dewran û çerxê da

Hebîbê bêxeta kuştim bi derba firqetê axir
Ji wê rojê dizanî min ku yar ew tîr li cergê da

Gelo dîsa bibînim ez çiraya wesletê hil bit
Bisojim şubhet perwanê li ber wê şewq û nûrê da

Bi der bê Kewkeba Subhê li meşriq Zuhre tali' bit
Zuhel dûr bit li şeş burcan û wunda bit di xerbê da

Ji qundus Zuhre peyda bit ji sundis Muşterî bê der
Sipêde det Sureyyayê şefeq det qametê pê da

Ji şerqê ebruwan binmêt hilal dîsa di qewseynan
Ji xawer bête Xurşîdê zelam werbî di nûrê da

Bi werdan zeyyinîn gulşen çemen da lale bişkiftin
Binefş û çîçekan vêk ra şefeq da yek di rewdê da

Sehergeh 'endelîb mest in ji bêhna werd û bişkojan
Şubhê totak û goyînan dinalîn em di firqê da



## 7

Ayrılığın ateşiyle yandım baştan ayağa
Hedef oldum, şimşekler çakan o gaflet oklarına

Ra'd gibi şiddetlidir aniden kalbe saplanan ayrılık okları
Dağ gibi güçlü olsa da parçalanıp dağılır etrafa o anda

Hicran acısını tatmayan, sinemde yara var demesin
Ayrılık ve hasret gamından kim can verdiyse o desin!

Gamsız dertsizlerden sormayın aşkın cefasını
Bihaber olan ne anlar kırık ve yaralı bir gönlün acısını

Aşkın mihnetiyle ayrılığın dert ve acısını yudumlayanlar
Benim bu hicranlı ve gamlı hâlime ağlayıp dururlar

Esirinim aşkının tuzağında; delip geçti gönlümü ayrılık okları
Çırpınmaktayım kanrevan içre, yarı boğazlanmış bir kuş gibi

Batıni bir yıldırım çarptı kalbe alev aldı sine, ihtiyarsız
Ol ateşle alevler arasında nasıl karar kılsın ki gönül

Dağınık zülüfler gibi kararsızım her dem aşkından
Cismim yok oldu, gönlümün yitip gitmesi gibi aşkından

Sevgiliden ayırıp yükseklere atıp uzaklaştırdı beni felek bir anda
Bilmem daha nereden nereye atacak beni bu çarh-ı devranda

Sevgili sonunda öldürdü beni ayrılık darbeleriyle günahsız yere
Anladım o gün isabetle nasıl saplanmış olduğunu okun ciğere

Vuslat çırasının yandığını görecek miyim bir daha
Yanıp tutuşsam pervane gibi onun aşkının ışığında

Ah keşke Seher yıldızı doğsa, Zühre de yükselse doğudan
Altı burç uzaklıkta olsa ve kaybolup gitse Zühal batıdan

Zühre görünse gecenin karanlığında, Müşteri yıldızı çıkıverse
Şafak aydınlığı vursa Süreyya'ya, baştan başa her yeri aydınlatıverse

Görünse hilal kaşların nurlu yansımasından, yine yay burcunda
Doğudan doğsun Güneş, karanlık kayboluversin aydınlığında

Güllerle süslendi bahçeler, çimende laleler açtı
Menekşeler, çiçekler hep beraber bahçeyi aydınlattı

Mest oldu seherde bülbüller güllerle tomurcukların kokusundan
Biz ise tutî ve goyin kuşları gibi ayrılık acısıyla inlemekteyiz



Li kelbê asitanê xwe nepursî qet hebîb carek
Gelo naêne bîrê em [d]i vê nêçîr û ravê da

Dizanim şehsuwarê min xezalek wê di fitrakê
Bi cayê seydê ez bûma di fitrak û bendê da

Çi hedd seyd in hezar can in di fitraka hebîbê min
Ku sed Cimşîd û Keyxusrew xulam in ser di vê rê da

Di deh salan mulazim mam û yarê rû neda carek
We ger ne yar eger rû det bes e carek di salê da

Dilo mizgîn e min şa be ku sultanê me dê bêtin
Ji min bawer ke peyxamê seher mizgîn bi min pê da

Şukur bînahiya min hat û Ye'qûb dîde rewşenbû
Bi boya Yûsufê Misrê li Ken'anê beser peyda

Nesîmê sunbul û sêvan seher da hebs û zindanê
Vebû qufla me bêmifte ziringînê ji quflê da

Fîraqê şev bi axir çû sipêde kifşi bû dîsa
Merîxa nehs avabû, xuyabû roj di şerqê da

Di çerxê wek nucûm dêmdur sema hatin qirana yek
Heyîva bedr bû ew surperî min dî di reqsê da

Ji Wadyê Eymena dilber nizam enguştek îzhar kir
Ku xweş enwar û berq in wê tecellabûn di Tûrê da

Qirana Zuhreyê min dî di ber 'iqda Sureyyayê
Ji perwînan dibêjim 'eks e hêj keftî di camê da

Hebîbê 'ezmê suhbet kir di caman lew şerab anî
Dilê min wî du seyyadan ji buryan ra berê wê da

Ji şeklê ebruyê saqî û bedrek min muqabil dî
Hilatin sed hilal-ebrû îşaret min ji 'eksê da

Bi tûlên asitanê xwe vexwendim mîr bi dergahî
Bi vî çavî hebîb dîtim şukur ev şefqe Mewlê da

Bi zehrê xwe'y şerîf xwendim ji xizmetkarê dêrîn î
Te pur cewr û cefa dîne d'sulûk û se'y û cehdê da

Biçîn werdan ji gulzaran ku exyaran bi dest xar in
Ji mexsûsanê dergahî we 'am in ew di hecrê da



Eşiğinde bağlı duran köpeğini sormadı bir kez olsun sevgili
Bu av mevsiminde acep hatırına getirmez mi bizi

Biliyorum bir ceylan var şehsüvarımın terkisinde
Ne olurdu bağlanmış olan ben olsaydım o avın yerinde

Sevgilinin terkisinde bağlı binlerce cân ile sayısız av tutsağı
Yüzlerce Cemşid ve Keyhüsrev el pençe divan durur hizmetinde

On yıl kaldım yârin kapısında, bir kez bile yüz göstermedi bana
Oysa lütfedip yılda bir kez de olsa yüz gösterseydi yeterdi bana

Ey gönül şad ol! Müjdeler olsun, sultanımız gelecek bugün bize
Seher yeli verdi bu müjdeyi bana, inan bu sözlerime

Şükür ki gözümün nuru geldi Yakup'un gözleri aydınlandı
Mısır'lı Yusuf'un kokusuyla Kenan ilinde gözleri açıldı

Sünbül ve elmalardan seherde esen tatlı rüzgâr ulaşınca zindana
Anahtarsız açıldı kilidimiz gümbürtüler kopartarak o anda

Gece sona erdi, şafak sökün etti ey ayrılık uzaklaş artık benden
Uğursuz Merih batıp kayboldu gözden, Güneş göründü doğuda

İnci yüzlü, yıldız gibi parlak güzeller raksa kalktı hep beraber
Raks halkasında gördüm, sanki bir dolunaydı o peri-dilber

Sevgili Eymen Vadisi'nden sadece bir parmağını gösterdi
Çünkü Tur-ı Sina'da çok güzel nurlarla şimşekler tecelli etti

Süreyya burcu önünde Zühre yıldızını gördüm
Şarap kadehine yansıyan Pervin'in nurudur sandım

Sohbet meclisine niyetlendi sevgili, doldurdu şarabı kadehlere
Büryan yapmak için yüreğimi, iki avcı gibi kovaladı beni gözleri

Saki'nin kaşları arasından karşımda ay yüzlü yâri gördüm
Yüzlerce hilal doğdu, onların işaretlerinin aksinden

Eşiğindeki köpeklerle birlikte çağırdı sultan beni huzuruna
Şükürler olsun Mevla'ya ki bu gözlerle gördüm sevgiliyi

Tatlı sözleriyle bu eski hizmetkarını huzuruna çağırıp dedi:
"Çok cefalar çektin, çalışıp çabaladın bu seyr-ı sülukta"

Der gülleri gül bahçesinden, ki ağyâr sadece diken toplar
Yıllarca bekleyenler var havastan hicran içre bu dergâhta



Bi teşrîfa xwe ez dîtim ji lutfê bende nîşan kir
Xelat û şefqe û dildan şukurxwaz în ku Baxwoy da

Me hadir secdeya şukrê li wî ‘erdê muqeddes bir
Bi mujganên xwe dur simtin enî malî li ‘erdê da

Ey a bînahiya çavan but û ‘uzza û latê min
Tu wî pêşî sucûda min sehergahan di xilwê da

Li bal ‘ilmê te me‘lûm e ji jînê min tu meqsûd î
Fid[ay]ê xanim me dê can bit di qesta wesl û dînê da

Bi husna xwe’y îlahî kî bi sehm û heybeta dînê
Nucûm û kewkeb û lami‘ ji bala tên bi bejnê da

Bi xalên werd û nesrînan ji qudret xet kişandî lê
Bi terha nêrgiza re‘na sehergahan nesîm lê da

Ku tûlê asitanî dûr nekî êdî ji dergahî
Ji Baxwoy vê ricû nakîn di babê lutf û rehmê da

Di barê firqetê zanî dikarim ez tehemmul kim
Bi narê kohê Qendîl im [meger fîl] im di ‘işqê da

Dehî derdê mezin firqet ceger sot ateşê da dil
Cihê sebrê nema çendan ferec min dî di sebrê da

**Mela** bêqameta yekta qiyamet min bi [ç]ehvan dî
Fîraqê rûsiya bin ma ji min canê şîrîn cê da

## 8

Serê zulfa te bi kullabê du‘a
Hate destê me bi cellabê du‘a

Sofiyê xilwetnişîn di sucûd
Herdu birhên te ne mihrabê du‘a

Erzê kî dê bikerim sûretê hal
Ku tu bî qibleyê erbabê du‘a

Ji du‘ayê qedehek der dest e
Her seher mestê meyê nabê du‘a

Gulê iqbalê ji gulzarê qebûl
Me çinîbû di şerkerxwabê du‘a



Kerem edip çağırdı, lütfuyla nişanlar takıp işaretledi bu kulunu
Şükür Allah'a ki; bunca hediyeleri o vermiştir bize

Şükür secdesine kapandım sevgilinin mukaddes beldesinde
Gözyaşlarımı kirpiklerime dizip alnımla süpürdüm yerlerini

Ey gözlerimin aydınlığı; putum, uzzam ve lâtım sensin
Halvet anında seherlerde sücudumun kıblesi sensin

Sensin hayatımın maksudu, ki bu malumdur senin ilminde
Fedadır sultanımıza ruhumuz, her kavuşmak ve görüşmek isteğinde

İlahî! güzelliğinin aşkına, onun heybet ve azameti aşkına
Yükseklerden kayıp gelen yıldızlar ve gezegenler aşkına

Yemin olsun kudret eliyle çekilmiş hatlara, güllerdeki benlere
Seherde esen meltemle sağa sola salınan taze nergis dalı aşkına

Eşiğindeki köpeğini bir an olsun uzak tutma dergâhından
Ricacıyız Rabbimizin rahmet ve lütuf kapısından

Ayrılık yüküne tahammül edebileceğimi bilirsin elbet
Aşkta Kandil dağı kadar yüksek, fil gibi güçlüyüm çünkü

Ne büyük dert imiş meğer ayrılık, ciğeri yakıp gönlü verdi ateşe
Kurtuluşu sabırda buldum sabra tahammül kalmamış olsa da

Kıyameti gözlerimle gördüm o yekta kametin ayrılığında **Mela**
Kara olsun yüzün ey ayrılık, en tatlı yârimi ayırırsın benden

## 8

Zülfünün ucunu küllâb-ı dua
Ulaştırdı elime cüllâb-ı dua

Sufiler halvethanede secdeye gittiklerinde
Senin her iki kaşındır mihrab-ı dua

Senden başka kimim var kime hâlimi arz edeyim
Kıble diye ancak sana yönelir erbab-ı dua

Hazır elde şimdi bir kadeh var duadan
Sarhoş eder beni her seher safi olan şarab-ı dua

Kopardık ikbal gülünü rıza ve kabul bağından
Devam edip giderken o tatlı hâb-ı dua



Herdu birhên te ji îxlas û yeqîn
Me di wî secde ye bi adabê du'a

Ji dilek safî bibeyn mihrabê
Secdeyek lazim e der babê du'a

Me be dil 'urwetê wusqa ye di dest
Ji senaya te ser elqabê du'a

Ji ezel yekcîhetî daye **Melê**
Her me îxlas ji esbabê du'a

## 9

Lillahilhemd [ji yarê] me di dest cam e lebaleb
Ji lebê noşî peyapey di dil îlham e lebaleb

Di riya wan xett û xalan ku ne herfên qelemî ne
Me ji feyza te ye mestane rewan cam e lebaleb

Mestê şehkasê meya cazîbe ye rûh di zat
Ku ji ber lezzetê 'işq çi neseq maye lebaleb

Nêrgiza mest ji bala çemena sunbul û gul tê
Qedehek taze bi destê xwe tinê da me lebaleb

Wehdetê sirf e me 'işret te çi iksîrê wucûd
Em lebaleb çi lebaleb bi xwe hem cam e lebaleb

Şem' û perwane bi zatê xwe ji halê me diden
Ateşek sirf e ji 'işqa te nufûs me lebaleb

Qedehek bade ji 'işqê di ezel da me Hekîm
Jê du[h] noşîn heyahey bi xwe cama me lebaleb

Carekî gotî **Nîşanî** ne **Mela**yî were ba vî
Me ji xwûnê dil û can û dehen û kame lebaleb

Te dizanim, te dibînim ku tu yî nûrê wucûd
Ellah Ellah ji çi nûr e te serapa me lebaleb

Ji 'înayet nezera xas e ku her misre' û beytek
Qedehek abê heyatê ne di şi'ra me lebaleb



Her iki kaşının önünde ihlas ve yakin ile
Secde ederiz, rehberimizdir adab-ı dua

Safi bir gönül ile varalım kaşların mihrabına
Bir secde getirmen gerek bâb-ı duada

Urvetü'l-vüska gibi gönül elimizdedir bizim
Övmek için seni elkab-ı duada

Rabbim gerçek tevhidi vermiştir **Mela**'ya ezelde
Onun için azadeyim, bağlamaz beni esbab-ı dua

## 9

Şükür Allah'a ki, sevgiliden bir kadeh var elimizde lebaleb
Gönlü biteviye dolduran bir ilham var tatlı dudaklarında lebaleb

Kalemle çizilmemiş olan o hatlarla benlerin yolunda
Feyzinden mestane akıp gider şarabımız lebaleb

Coşturan şarabın kadehiyle sarhoştur gerçekte ruh
Aşkın lezzetinden nasıl da dolup taşmış lebaleb

O mest nergis, yükseklerdeki gül ile sümbül çimeninden gelip
Kendi eliyle doldurduğu bir kadehi sadece bize sunar lebaleb

Vahdet-i sırftır işretimiz, ne acayip bir iksiridir varlığımızın
Öyle bir doluyuz ki hem özümüz hem kadehimiz doludur lebaleb

Mum ve pervane hadd-i zatında hâlimizi anlatmada
Mutlak bir ateştir aşkından bu canlarımız lebaleb

Bir kadeh şarap sundu bize aşktan o Hakîm ezelde
Dünden beri içmekteyiz ondan, doludur hâlâ bardağımız lebaleb

Yâr; "**Mela** değil misin, yukarı gel" dedi **Nişanî**'ye bir defasında
Bizim kan ile gönlümüz, canımız, ağzımız ve arzumuz doludur lebaleb

Seni bilir seni görürüm ki sensin varlığın nuru
Allah Allah ne acib nurun var baştan ayağa onunla dolmuşuz lebaleb

Şiirimizin her mısraı, her beyti Allah'ın has bir inayetidir bize
Çünkü şiirimiz abıhayat ile dolu bir kadehtir lebaleb



## 10

Destê qudret ku hilavêti ji bejna te nîqab
Li cemala ceberûtî me neman perde hîcab

Li gulên te'y ter û nazik ku seher girt xunav
Di ebarîqê defînan ji hesed sohtî gulab

'Eynê kafûrî ye meşreb me ji husna te ye saf
Lew ji 'işqa te di dil da me vebû 'ilmê 'ubab

Me ji serçeşmeyê mey qedehek safî vexwar
Nagihê lezzet [û] zewqa me bi sed cildê kîtab

Lew di çengên me def û ney ku di 'işqa te bi saz in
Me bi bejna te dixwûnin def û qanûn û rebab

Qehweya telx digel zehrê helahil biderî
Me ji destê te mubarek şekeramîz e xwoşab

Qulzemê 'işqê ji bayê xwo muxalif demekê
Ne humaya te 'ecacê me li ser destê xurab

Seherê Xizri 'înayet ku birîn çeşmeyê dil
Li cihanê me nezer da ku cihan 'eynê serab

Bi hebaba meyê mexrûr we sergeşte **Mela**[10]
Bavên keftiye wê bêdem e sergeşte hebab

Dê me hudhud ji Seba bêt û [b]izanîn çi ye hal
Ku li halê me xerîban ne sual û ne cewab

Herdu burhên te ne mihrab çi îman û çi kufr
Bûd û nabûd ku yek bin çi sewab û çi 'îqab

Were bêperde xwe nîşanê **Nîşanî** de seher
Lê ji xwûnê bike perhîz [ku] şehîdan çi hisab

## 11

Şeh bi qesda kuştina min rim hejandin, min go "sebeb?"
Dame çeşmê qehr û xeşmê rim li dil da go "edeb!"

Kuştiyên dîdar û dînê ger çi herroj deh sed in
Her subh dîsan ji nû anîne ber kêrê [sed] celeb

---

10 Di nusxeyên dî de me'naya vê beytê bereqs e.



## 10

Kudret eli çekip kaldırınca endamından nikabı
Kalktı ortadan ceberruti güzellikle aramızdaki perde

Seher vakti çiğ düşünce ter u taze güllerine
Hasedinden yandı gül suları billurdan ibriklerde

İçtiğimiz çeşme güzelliğinin saf kâfurundandır
Aşkındandır ki açılmıştır bize deryalar dolusu ilmin

İçtik abıhayat çeşmesinden bir kadeh sâfi
Yüz cild kitap, aldığımız bu lezzetle zevke gelmez kâfi

Elimizde def ve ney ile aşkına şevk u saz ile amadeyiz
Def, kanun ve rebab davet eder bizi endamının seyrine

Öldürücü zehri acı kahve içre sunsan da bize
Şekerle karışık gül suyu olur mübarek elinden bize

Ters esen rüzgârlardan hâli olmaz aşk denizi hiç bir zaman
Fırtına hemhemeleri arasında binmişiz işte böyle bir gemiye

Hızır inayeti seherde götürünce bizi gönül çeşmesine
Aynıyla bir seraptır gördük nazar kılınca cihanın her cephesine

**Mela**, başı dönmüşcesine mağrurdur şarap kabarcıklarıyla
Boş yere dönüp dururlar su üstünde, hava dolmuştur içlerine

Gelir mi Hüdhüd acep Sebâ ülkesinden, ki bilelim ahvali
Biz gariplerin hâlini ne soran var ne de cevap veren

İmanda da küfürde de mihrap her iki kaşındır senin
Olmakla olmamak bir ise eğer, nedir bu sevapla bu ikab!

Gel ey sevgili, örtüsüz göster kendini **Nişanî**'ye bir kez seherde
Hazer et yolunda şehit düşmüş sayısız âşıkların kanlarından

## 11

Çekince mızrağını sevgili beni öldürmek için, sordum "sebeb?"
Kahr ve hışımla sapladı mızrağı kalbime, dedi; "yahû edeb!"

Onu görmek uğruna gerçi her gün binlerce kişi ölse de
Yüzlerce bölük insan yatırılır her seher bıçak altına yeniden



Dê ji çerxê pencemîn bêt û tenezzul ket Merîx
Mislê Şemsê seyf ger bişkênît ew tîxên xezeb

Her mecala ew di cengê bêt û ret her carekê
Rast û çep dê bêxitin sed sed bi mizraqa qeseb

Rustem û Cemşîd û Xalid Hemze yan Şêrê ‘Elî
Aferîn ya şehsurwarê Tirk û rimbazê ‘Ereb

Pê li tolê asitan da çix bi wan le‘lan kirî
Dergehê fethê vebû dîsan li mehcûran ‘eceb

Bendeyê sadiq seher amancê reştûzên xwe kir
Min bi qewlê dijminan dest da xedengan bêsebeb

Leşkerê qehr û xeman wê çûn hisara dil bikin
Ke‘be û Beytulheramê ra neborit bê Receb

Suftiyên pur le‘l û mercan min bi mujganan heta
Dîde rewşenbûn bi dîna dêmdurra sîmînxebeb

Ê bi Xizrî ra divêtin abê heywan bit nesîb
Dê di se‘y û telebê yeksan li bal bin roz û şeb

Xidmeta pîrê muxan dê ket kesê meqsûd e mey
Di şîşe û cama zucacî ê divêt dê ret Heleb

Cewrê Hindî dê bikêşît her kesê Tawus divê
Gewher û durra yetîm bêterk ser nabi teleb

Xefletê ew keşşifî şîr di dest bi dest hatin ciger
Go xenîmet ya Melê miskîn me lê ker kir kezeb

## 12

Min di dil kovan hizar in dax û keyber bêhisab
Mihneta werdên bi xar in wê di dil da sed nişab

Sed nişab in min di dil îro ji xarên sorgulan
Yek bi yek peykan çevîbûn çûn di cergê da kulab

Pur bi wan cerhan xweşbûn lew ku wê derman dikir
Şerbet û ava heyatê şekker û qend û gulab

Ger dused peykan di nêva dil buwan dê xweş buwa
Her dema kewkeb bidîna necm û perwîn bêhîcab



Sevgili, Güneş gibi kılıcıyla kırarsa gazap kılıçlarını
Merih de beşinci felekten inip hemen başını eğecektir

Ne zaman ki vur-kaç yöntemi uygularsa savaş meydanında
Sağa sola devirir yüzer yüzer kişiyi kamıştan mızrağıyla

Rüstem mi Cemşid mi Halid mi Hamza mı yoksa Arslan Ali mi?
Yaşa sen ey Türk süvarisi, ey Arab'ın mızraktarı!

O lal dudaklardan çık emri sadır olunca eşikteki köpekçiklere
Açıldı yine biz uzak unutulmuşlara manevi fetih kapıları

Sadık kölesini hedef kıldı siyah gözlerine seherin vaktinde
Düşmanların sözleri üzerine elime aldım okları sebepsiz yere

Kahır ve gam ordusu hareketlendi kuşatmak için bu gönlü
Kâbe'dir, Beytü'l-haram'dır gönül, geçmesin ondan Receb'siz

Öyle dizmişiz ki kirpiklerimize lal ve mercan tanelerini
Nurlanır hemen gözler, görünce o inci yüzlü, gümüş gerdanlıyı

Hızır'la birlikte abıhayattan nasib almak isteyenin
Gündüz gece demeden eşit cehd ve talep içre olması gerek

Pir-i muganın hizmetinde olması gerek, maksudu mey olanın
Halep'e gitmesi gerek, şarabı billur kadehte içmek isteyenin

Tavusu isteyenin katlanması gerekir Hinduların cevrine
Baş vermeden talip olunur mu hiç inci tanesi ile cevhere

Sevgili elindeki kılıçları sallayıp ansızın hedef kıldı ciğerimi
Ne büyük ganimet, dedi, parçaladık zavallı **Mela**'nın ciğerini

## 12

Binlerce hasret, hesabsız yaralarla dağlamalar var gönlümde
Dikenli güllerin mihnetinden yüzlerce okun yarası var gönlümde

Kırmızı güllerin dikenlerinden gönlümde bugün oklar yüzlercedir
Girip saplanmış temrenleri birer birer, saplanan çengeller ciğerdedir

O tatlı yaralarımızla hoştuk, çünkü onları sevgilimiz tedavi ederdi
İlaçları şerbet ile abıhayattır, kand u şekerdir gül suyuyla birlikte

İki yüz sivri peykan saplanmış olsa da gönlüme, iyileşirdi şüphesiz
Ne zaman ki seyretseydim bir kez Süreyya yıldızını perdesiz



Zuhre û ‘iqda Sureyya keşşifîbûn ew di şerq
Sayeya bextê me dayê ma li ser perde’w nîqab

Wajigûn dewrê numa min çerx û bayê lewleban
Kewkeban seyra muxalif girt û têkil kir hisab

Vêk ketin Şems û Zuhel îro di burca ‘eqrebê
Seyf çû destê Mirîxê mulkê dil lew kir xerab

Lew tenezzul kir Mirîxê nobe çû dora Zuhel
Çû teref Mihra Sipîhrê nezzilî ‘erdan ‘ezab

Lew li şeş burcan ‘Etarid j’Afitabê dûri bû
Lê Zuhel lew Muşterî avête çerxê înqilab

Şewwişî nezma nucûman hey’eta çerx [û] burûc
Lew li wed‘ek derunên Mah û Zuhr û Afitab

Zuhreyê ceng û sewaş ev dî ji çeng avête çeng
Xweş li pê qanûnê ney wê goti qanûn [û] rebab

Munqelib min dîn menazil vajî ew seyrê [d]ikin
Yek bi yek xwûn jê dibarin ateş û lem‘ û şihab

Ez dibêm axir zeman e dê qiyamet rabitin
Lew şeva tarî kişand û nehişt eswedxurab

Xweş li min ‘alem siyeh ma seyrê kewkeb qet neman
Ez ji vê rojê ditirsam axirî zû kir şitab

Ev ne ew iqlîm e guya Şems û kewkeb tên bi seyr
Ez ewî ‘erdî dibînim ya ku lê ew mahitab

Cinn teyyarek her me dî werbû di min winda kirim
Dame ber pençe’w kulaban firandim wek ‘îqab

Sufle wê înam û avêtim zemînê zulmetê
Ê gelo hişyar im ez ya xewn e min dîtî bi xwab

Dêwê mel‘ûn û munafiq ê Xudê rûreş kirî
Ma bi bala hilkişîtin ‘aqîbet çêbit selab

Ehremen te‘lîm da lew Ebyedî dest tê hebû
Pur bi vê te‘lîm û rayê hatibû çûbû xitab

S[ur-p]erî ‘illet nizanî sihre dê Ebyed biket
Pur xelet erzan me dî derheq xwe ew ‘alîcenab



Doğup göründü Zühre ile Süreyya yıldızı doğudan
Kötü bahtımızın gölgesi engel oldu görmeye, kalkmadı perde aradan

Ters yüz edilmiş göründü bana vefasız çarkıfelek
Ters yöne dönmeye başladı gezegenler, karıştı birbirine hesab

Akrep burcunda karşılaştı bugün Güneş'le Zühal
Merih'in eline geçti kılıç, ondan gönül mülkünü etti harab

Merih inince tahtından Zühal'e geçti saltanat
Güneş'in tarafına geçince de, yeryüzünü sardı azap

Merkür, Güneş'ten altı burç uzakta olduğundan
Zühal, Müşteri'yi attı kendi yörüngesinden

Burçlarla yıldızların yörüngesi bozulduğundan gök kubbeyle birlikte
Zühre yıldızı ile Güneş ve Ay doğmuyor artık eski düzen üzere

Raks eden Zühre görünce bu savaşı attı elinden çengi bir kenara
Usulüne uygun biçimde kanundan sonra kulak verdi ney ile rebaba

Ters dönmüş yörüngeleri gökteki yıldızların, ters dönmedeler
Her birinden tek tek kan, ateş ve alevler yağmaktadır

Ben derim ki, artık ahir zamandır kıyamet koptu kopacak
Ondandır karanlık gecenin uzaması, siyahlık bırakmamış kargaya

Karanlığa büründü âlem, görünmez oldu gökte yıldızlar
Korkuyordum böyle bir günden, sonunda çabuk geçti bu an

İçinde Güneş'le yıldızların seyrettiği bir iklim değildir bu
O mehtabın parladığı o yeri görüyorum şimdi ben

Uçan bir ifrit gördük, abanınca üstüme kaybettim kendimi
Pençesine alarak yükseklere fırlattı bir kartal gibi beni

Sonra baş aşağı çevirip attı beni karanlıklar ülkesine
Gerçekte ben uyanık mıyım yoksa gördüğüm bir rüya mı?

O mel'un ve münafık ki Allah yüzünü kara kılmıştır onun
Akıbeti yukarı çekilip ölümden başka ne ola onun

Ehrimen vermişti talimatı, Ebyed'in de parmağı vardı bunda
Çok istişareler yapılmıştı bu görüş ve talimat hususunda

O peri-sûret bilmedi bu işin illetini, habersizdi Ebyed'in sihrinden
Hakkımızda çok yanlışlıklarını gördük o alicenabın



Ahê eyyamê wîsalê duh ku xweş borîn û çûn
Ew şeraba ‘îş û noşê ma li pêş[berê] min serab

Şerbeta şîrînleban jehra helahil bû di nav
Lew bi narê hisretê axir li min dil kir kebab

Hudhudek xweşteb‘ min îro divê her wek nesîm
Da vi bal dilber hinara aniya dîsa cewab

‘Erzê halê min bigotayê bi ‘inwanê edeb
Asîtan bikra ziyaret çetr û seywan û tunab

Da di çavan min veîna her wekî dar-totiya
Ya hebîb pê lê nihaî baniya wê ew turab

Herkesê rabî di behsê carekê mehder biket
Xêrê heftê hec didêrî belku pêtir ew sewab

We‘de duh da dê şehîd kem ez bi şîrê xwoy şerîf
Ma nebî îro peşîman ew ji tedbîra sewab

Şerhê halê min **Mela** nabit li beyadê bêtemam
Vê sewadê ger çi her dem jê birin sed întixab

## 13

Lew seher cewlan didet bayê sebayê rast û çep
Sosin û sunbul bi mestî tên semayê rast û çep

Da ji mihraba du nûnan secde bet Eswed-hecer
Dil bi mîzan mahê new ebrû numayê rast û çep

Dil di zulfa silsilîn bû fer dida xala siyah
Şehperê zulfê ji bi “lam” û “dal” dayê rast û çep

‘Alemê wêran diken zulfên ji rengê ‘enberê
Çerx û perwazê diden carek li bayê rast û çep

Xencer û tîr wî dibarin her wekî berq û burûsk
Misriyan lami‘ ji elmasan didayê rast û çep

Teyrik û ‘iqd û şerab û netrik û belg û wereq
Her bi lerze û cezbe yîn yaqût di tayê rast û çep

Bişkuwên benda girêbanê ji rengê kewkeban
Berq û tîrojan ji Xurşîdî vedayê rast û çep



Ah, o güzel vuslat günleri dün gibi gelip geçti çabucak
O hayat bahşeden tatlı şarap gözümde oldu şimdi serap

Tatlı dudakların şerbetinde öldürücü zehir varmış meğer
Sonunda ayrılık ateşiyle yakıp kebap etti yüreğimi

İyi huylu, tatlı esen meltem gibi bir hüdhüd gerek bugün bana
Ta ki sevgiliye ulaşıp yine bir cevap getirsin bana

Arz edip anlatsaydı ona edep erkan ile bulunduğum haleti
Yârin çadırının gölgeliğini ve halatlarını öpüp ziyaret etseydi eşiğini

(Hüdhüd) Sevgilinin ayak bastığı topraktan alıp getirseydi de
Hasta olan gözlerime merhem diye sürseydim onu

Her kim şefaat etmeye kalksa aramızdaki bu meselede
Yetmiş hac sevabına nail olur, fazlasına belki de

Kendi şerefli kılıcıyla beni şehid etmeyi vadetmişti dün sevgili
Umulur ki pişman olmamıştır bugün o doğru kararından

Hâlimin şerhi, temize çekme için tamam sayılmaz **Mela**
Her dem yüzlerce kelime seçilmede bu müsveddeden

## 13

Zambak ve sümbüller mestane raksedince sağlı sollu
Sabah rüzgârı da eser durur seher vaktinde sağlı sollu

Gönül, iki "nun"un mihrabından hacer-i esvede secde etsin diye
Kaşları, yeni doğmuş ay gibi ölçülü görünür sağlı sollu

Gönül, sıra sıra zülüflere takılı kalıp o siyah beni aydınlatırdı
Latif zülüflerin uçları "lam" ve "dal" harfi gibi kıvrılmış sağlı sollu

Amber gibi siyah zulüflerin, âlemi viran edip
Onu rüzgârın önünde dağıtıp savurur sağlı sollu

Hançerler ve oklar yağar üstümüze yıldırımlar gibi
Mısır yapımı kılıçlar her tarafı aydınlatıp ışık saçmada sağlı sollu

Gerdanlıklar, kolyeler, zincirler, takılar, yaldızlar ve yapraklar
Sıra sıra dizilmiş yakutlar durmadan hareket etmede sağlı sollu

Çözülünce yıldız gibi parlak olan gerdanındaki düğmeleri
Şimşekler çakar, ışık hüzmeleri yayılır Güneş'ten sağlı sollu



Kewkeb û qews û qezeh lûlû û bend û heyderî
Tên tewafa zulf û xalên dilrubayê rast û çep

Dil dixwûnit xett û xalan dêm û balayên ji nûr
Her bi qanûn mujdeya ‘Îsa ji nayê rast û çep

Zengiyan quşen vebestin pêşiberê coqa Hebeş
Daberistin yek bi yek çûn ber lewayê rast û çep

Çingeçinga bişkuwan awaz û dengê zerguwan
Sed melayik guh didin ber wê [n]ewayê rast û çep

Ew ji ‘işqa wê dinalin bazin û belg û wereq
Cezbeya dil min ji remza wan gehayê rast û çep

Zuhre û ‘iqd û Sureyyayê di şerqê keşşifîn
Leyletulqedrê ji mexrib perde dayê rast û çep

Zuhrerengê Mahê Xurşîdê ji bala wê numa
Lê du kewkeb çûne vê ra îstîwayê rast û çep

Bête eywanê ji xelwê qudsiya horîsirişt
Sed hezaran horîqudsî tên lîqayê rast û çep

Ma **Mela**yî me ji lebê le‘l avê heywan bit nesîb
Qudsiyan ragirtîne destê du‘ayê rast û çep

## 14

Ewwel ku yarê da me yek zerreyek îşaret
Qismet me xemr û cam e ji deftera ‘înayet

Husn û cemalê canan nabêretin tu payan
Herçi nebit bidayet esla nehin nihayet

Feyda ‘ulûmê hikmet cama sedef ku gêra
Me j’destê muxbeçan dît bi Mishef û bi ayet

‘Arif heta nenoşî ji destê meyfiroşî
Xaib nebû ji hoşî peyda nekir wilayet

Gunah zuhd û tamat hilnagirit [x]era[b]at
Kesê bi vî li rê bet divê biket ri‘ayet

‘Işqê ji herdu çavan ewwel di dil eser kir
Bê zerre zerre axir sotin dikir sirayet



Yıldızlar, eleğimsağmalar, Hayderan ipine dizilmiş inciler
O gönülçelenin zülüflerle benlerini tavaf için salınır sağlı sollu

Çağırmada gönül, hat ve benlere, nurlu yüzle selvi endama
İsa'nın müjdesini kanun ile neyin sesinden vermekte sağlı sollu

Habeşlilerin hücumuna karşı zırha bürünmüş zenciler
Bir bayrak altında buluşup saldırdılar birer birer sağlı sollu

O düğmelerin hışırtıları, o altın tanelerin çıkardığı sesler
Yüzlerce melek kulak vermede bu seslere sağlı sollu

Bilezikler, alınlıklar, altın süsler inlemekte onun aşkından
Cezbeye kapıldı gönlüm remizlerinden sağlı sollu

Şarktan doğup göründü Zühre ile Süreyya yıldızı yine
Perde olup kapattı onları kadir gecesi batıdan sağlı sollu

Zühre renkli sevgilinin endamından Ay ve Güneş görününce
Eşlik etti ona istivada iki yıldız sağlı sollu

Huri gibi kutsal yaradılışlı sevgili halvetten çıkıp eyvana gelse
Yüz binlerce kudsî huri, onu görmek için sıraya dizilir sağlı sollu

**Mela**! Lal dudaklardan abıhayat içmek nasib olur mu acep
Kaldırıp açmış ellerini kuddusiler dua için sağlı sollu

## 14

Sevgilinin ilk verdiği şey bize bir zerre bir işaret
Kadeh ve şarap imiş defterden payımıza düşen inayet

Sınır yok sevgilinin hüsn u cemaline
Yoksa bir şeyin bidayeti olmaz onda asla nihayet

Hikmet ilminin feyzini, dönüp dolaştığında sadeften kadeh
Mey sunucuların elinde gördüm, tanıktır buna Mushaf ile ayet

Arif kişi, mey satıcının elinden mey içmedikçe
İçip de kendinden geçmedikçe bulamadı velayet

Bunca göstermelik zühdü ve günahı kaldıramaz harabat
Bu kapıdan giren için vaciptir erkan ve adaba riayet

Aşk, gözlerden önce gönüle tesir etti
Aheste aheste yakıp her tarafa etti sirayet



Şakissilahi herdem bi kuştina **Melê** tê
Gazindê ez ji kê kem ji kê bikem şikayet

Cama bi destê şahid jengê ji dil dişotin
Pîrê muxan weh duh jî rindan dikir riwayet

Etwarê ‘işq û mestî esrarê butperestî
Teqrîrê sed riwayet nakit bi wê kifayet

Li yetmeinne qelbî ‘eynulyeqîn dibexşet
‘Eynul‘eyan divêtin kafî nihin dirayet

Mîrî û padişahî mûyek li nik **Mela**yî
Nadem bi mulkê ‘alem yek zerreyek ‘înayet

## 15

Kes bi dadî ku nepirsit gilleh û dad çi ket
Te nebit dadiresek beyhude firyadi çi ket

Bi Şîrînê negehit desti eger Rustem bit
Dê bi bazûyê milan şubhetê Firhadi çi ket

Fa‘ilek lazim e da fi‘l û eser peyda bit
Ger tu heddad nebî kûreyê heddadi çi ket

Mumkinek dê hebitin da ku teleb hasil ket
Seyd û nêçîr nebit tûleyê seyyadi çi ket

Her gil û seng dibin zêr bi tedbîrê hekîm
Qabiliyyet ku nebit hikmetê ustadi çi ket

Kan be gewher çi biket gewher eger paki nebit
Ku besîret te nebit sîretê ecdadi çi ket

Zêr û zîwer dikirin celbê qulûban haşa
Husn û sur zati nebit qametê meyyadi çi ket

‘Aşiqê mestê bi ‘işqê niye hacet bi meyê
Waridê warid û ehwali bi ewradi çi ket

Te xered vêkketina yek weliyek murşidi bit
Salikê talibê îrşadê bi Bexdadi çi ket

Cehd û se‘y û telebi bêeserek safî nehin
Tu hebî perdenişîn çaker û qewwadi çi ket



Keskin silahları olan sevgili her dem gelir öldürmeye **Mela**'yı
Onu caydırmak için kime etsem sitem, ya kime şikâyet

Sevgilinin elindeki kadehtir temizleyen gönül pasını
Pîr-i muğan rindlerden hep böyle ederdi rivayet

Anlamak için putperestliğin sırlarını, aşkın etvarını
Yüzlerce rivayet bu vadide etmez buna kifayet

Kalbim mutmain olsun diye sevgili sırları ayne'l-yakin verir
Yetinmez bununla kalbim ayne'l-iyan ister dirayet

Beylikle padişahlığın bir kıl kadar yok değeri yanında **Mela**'nın
Mülk-ü cihana değişmem, sevgiliden gelirse bir zerre inayet

## 15

Feryadımızı duyup cevap veren yoksa salt şikâyet ne yapsın
Feryadının yetişeceği biri yoksa beyhude feryat ne yapsın

Kaderde "Şirin"e ulaşmak yoksa eğer
Ferhat pazusuyla Rüstem gücü ne yapsın

Her fiil ve eser bir fail ister elbette
Demirci değilsen eğer demirci ocağı ne yapsın

Matlubuna ulaşmayı istiyorsan mümkün olanı iste
Avlanacak bir nesne yoksa eğer avcının köpeği ne yapsın

Kimyagerin elinde her taş ve çamur hiç dönüşür mü altına
Talebenin kabiliyeti yoksa üstadın hikmetli dersi ne yapsın

Maden ocağı ne etsin cevher temiz olmadıktan sonra
Basiretten nasibini almamışsan, ecdadının siret ve ahlakı ne yapsın

Görünürdeki süs ve takılar gönül çalabilir mi hiç
Doğal güzellikten nasip almamışsa, naz ve işveli endam ne yapsın

Şaraba ihtiyacı mı olur, aşk şarabıyla mest olanın
Menziline varmış kimse için evrad ne yapsın

Gerçek bir mürşitle buluşma arzusunda olan
Hakikat yolcusu için Bağdat'ta oturmak ne yapsın

Sadece istemek ve çalışmak kâfi değildir elbet
Perde ardında yoksa kimse, hizmet edecek uşaklar ne yapsın



Çi eser dê li berê xare biket qetreyê av
Qelemê ma bi du-sê qetreyê zehhadi çi ket

Dê ji Heq cazîbeyek dil bigirit wer ne **Mela**
Ji ezel ger tu hidayet nebit îrşadi çi ket

## 16

Mehbûb di dil da, me bi evrazi çi hacet
'Enqa bi xwe bêtin firr û perwazi çi hacet

Ney dûr e hebîbê me bi firyad û fixan keyn
Wî guh li zemîra dil e awazi çi hacet

Go suxte, murada xwe ji min telbe ke îro
Min go, tu kerîm î ji te daxwazi çi hacet

Min nale refîq in xem û tehlî ne musahib
Firyad enîs in me bi demsazi çi hacet

Dildan û newaziş çi ne duşnam bes in min
Pur derd û cefa hurmet û î'zazi çi hacet

Suhbet bi def û nayê hebîbê me nevêtin
Firyad û fixana me bes in sazi çi hacet

Raza me çi hacet tu ji xemmaz bizanî
Eşkên me bes in dîdeyê xemmazi çi hacet

Her lehze çi hacet ku bi nazan bikujî min
Cana jixwe qurbanê te bim nazi çi hacet

Ta çendî bi hecra xwe tu min tecrîbe înî[11]
Zêrê ji xwe xalis mehekk û gazi çi hacet

Hacet niye cana yedê beyda bideranîn
Înkari di dîn da nebit î'cazi çi hacet

Esrarê ezel dê di ebed bêne zuhûrê
Encamê serencamê ji axazi çi hacet

Ger lu'lu'ê mensûri ji nezmê tu dixwazî
Wer şi'rê **Melê** bîn te bi Şîrazi çi hacet

---

11 Di vê nusxeyê de ew hersê beytên piştî vê beytê nehatibûn, me ji nusxeyên dî wergirtin.



Bir damla su yalın taşta ne iz bırakabilir ki
İki üç damlacık kuru mürekkeple kalem ne yapsın

Gönlü yakıp tutuşturan bir cezbe olmalı Hak'tan **Mela**!
Ezel canibinden hidayet yoksa eğer vaaz ile irşat ne yapsın

## 16

Sevgili gönüldedir yükseklere çıkıp onu aramaya ne hacet
Kendi isteğiyle gelecekse anka kuşu peşinden uçmaya ne hacet

Sevgili bize uzak değil ki, feryat figan edelim
Kulağı gönlümüzde ise bağırıp çağırmaya ne hacet

"Dile benden ne dilersen ey suhte" dedi bana sevgili
Dedim; kerem sahibi olan sensin, kerem sahibinden istemeye ne hacet

İniltiler yoldaşım, gam ve acılar sohbet arkadaşımdır benim
Feryad en yakın dosttur bize, başka dost ve sırdaşa ne hacet

Gönül okşayıp iltifat etme ne ki, sövüp sayman yeter bana
Derd ü cefa ile büyümüş olana, hürmet ve ikrama ne hacet

Def ve ney ile dolu sohbet meclisini sevmez sevgili
Feryat figan yeterdir bize o dem, çalgılara ne hacet

Sırlarımızı gammazlardan öğrenmeye ne hacet
Gözyaşlarımız yeter, dîde-yi gammazın görmesine ne hacet

Her dem naz ve işve ile beni öldürmeye ne hacet
Ey sevgili, zaten kurbanınım senin, bunca naza ne hacet

Ne vakte dek hicranınla sınayacaksın **Mela**'yı
Altın saf olduktan sonra mehenkle çekice ne hacet

Yed-i beyzayı çıkarıp göstermeye hacet yok ey can
Dini inkâr yoksa eğer mucize göstermeye ne hacet

Ezelî sırlar çıkar bir gün ortaya nasılsa ebediyette
Varılacak işin akibetini ta başından bilmeye ne hacet

Nazmın etrafa saçılmış incilerini görmek dilersen eğer
Gel **Mela**'nın şiirinde gör onları, Şiraz'a gitmene ne hacet



## 17

Qelbê [m]e şubih zêrî ji feyza te cela girt
Ma rûsiyeh û sifrîsifet zengê seda girt

Teşbîhê [c]esed dil me di nêv ateşê 'işqê
Dê qelbê heqîqet bibit iksîrê hema girt

Salik kî ye hatî bi heqîqet ji mecazê
Sûret neşunasî û bi me'na ne fena girt

Tenha ne li min lami'ê husna te şefeq da
'Alem bi xwe wê husn û cemalê di xwe da girt

Teyxûn çi di destê tu zehî dewlet û îqbal
Herçî tu bo wî dam di tora xwe huma girt

Canê me xwe kir dane û dil dami vedayî
Ahûsifet ew pê hessiya rahê Xeta girt

'Enqa ne şikarê kes e davan tu biçîne
Dava te li 'enqayê veda badihewa girt

Herkes seherê talibê tiştek bi çimen hat
Hin sosin û hin sunbul û hin zulfê du ta girt

Destê me seher girt û birîn seyrê hebîbê
Filhali reqîbî ji hesed lerze û ta girt

Ew kebkê xeraman ku di kozê bi qebû hat
Şahînê qezayê bi texaful ji xwe ra girt

Zinhari kesê desti bibit erqemê selwî
Bê'işweyê le'lan ne bi teslîmî ziha girt

Sebrê berê şîrîn e we ustadi xeber da
Lew dil me di cellayî xeman xurrem û şa girt

Her neşter û şewkên ku tebîbê me li dil da
Min yek bi yek û têkî li derdê xwe şifa girt

'Aşiq ji xemê saye dî û cam teleb kir
Pur 'eqli didêrit me ji qismê hukema girt

Sef sef ne tinê gezme dibarin ji kevanan
Dil kakul û zulfan di kemendê bi teba girt

Dîwaneyê heçî dêm di vê silsile'w bendê
Ku musteheq e Xusruwê xûban bi ceza girt



## 17

Senin feyzinden cilâlânıp parladı kalbimiz bir altın gibi
Bundan ötürü o kirli pasın, bakır gibi yüzü karardı kaldı

Bir ceset gibi dönüp durmaktayız aşk ateşinin ortasında
Hakikata ulaştı gönül bu iksir ile hiç beklemeden

Mecazi aşktan hakiki aşka geçemez salik;
Tanımadan anlamını marifetin, olmadan fena makamına malik

Güzelliğinin parıltısı sadece beni aydınlatmadı
Âlemde her şey kendi zatında göstermekte bu hüsn ü cemali

Devlet u ikbal olan doğan kuşu elindedir senin, ne güzel!
Tuzağına düşürdüğün her şey hüma kuşuna av olur

Canımızı dane kıldık yârin yolunda kurulmuş tuzağa
Farkına varınca ceylan gözlü, saptı hemen Hita yoluna

Anka kuşu kimsenin avı olmaz ki önüne tuzak kurasın
Ankayı tutmaya uğraşanın çabası beyhude kalır

Bir şeyler dermek için bahçeye akın etti herkes seherde
Kimi zambak, kimi sümbül, bense zülüflerden iki tel kopardım

Seherde elimden tutup seyrana götürdü beni sevgili
Titreyip sıtmaya tutuldu hasedinden hemen rakip

Salına salına ötüp gelince o hacel kekliği tuzak yerine
Kaza ve kader şahini ansızın avlayıp aldı onu kendine

Sakın kimse uzatmasın elini o selvi boylunun örüklerine
Ejderha kapar, lal dudaklardaki işveye teslim olmayanı

Sabır meyvesinin tatlı olduğunu haber verdi aşkın üstadı
Neşe ile dolup taştı gönül, bunca gam ve kederden sonra

Sevgilinin, gönlü yaralayan her bir dikenle neşterini
Birer birer şifâ kılsın diye bu derdime kattım

Âşık, gamdan bir gölge görüp mey kadehini istedi
Hükemadan öğrendik bundan içenlerin selim akla sahip olduğunu

Yay kaşlarından üstümüze yağan demet demet oklar değil sadece
Esir kılmış gönlümüzü zülüfleriyle kâküllerinin kemendinde

Her daim sevgilinin zülüflerinin bendine düşen divane
Güzeller sultanından ceza almaya müstahaktır elbette



Peyweste du fêris ji kemîn daberizîn dil[12]
Zulfan ku çep û rastê li oxilme cema girt

Şi‘ra te **Mela** sihrê şeker[r]êz e bi mu‘ciz
Zanim ji lebê le‘li te ev lefze eda girt

## 18

‘Er‘erxeram e bi qedd û qamet
Yek bûse da me bi sed qiyamet

Yek bûse bexşî ewwel bi ihsan
Axir li min kir curm û xeramet

Ji jeng û zurqê dil da bişotin
Cama sedef da bi remz û kiramet

Bi dewrê çavên te’y mest û xwûnrêz
Nûra du çavan kê dî selamet

Li derd û êşan peykan û nîşan
Me j’dil û çavan kifş in ‘elamet

Ruswayê ‘işqê tenha ne ez bûm
Kê dî zemanan hub bê melamet

Du secde ferz in filhal [bi]ben ber
Dema xwiya bin ew qedd û qamet

Da ‘eybê rendan nekî bi badê
*Nufûsu qewmin bîha tesamet*

**Mela** li ‘umrê bêfeyde borî
Kêşaye zor an qehr û nedamet

## 19

‘Umrî zayi‘bû me bêdilber ‘ebes
Dî li vî ‘umrê me borî her ‘ebes

Dil emanet da bi naehlan nedî
Ku bi naehlan me da gewher ‘ebes

---

12 Beytek piştî vê beytê heye ku di vê nusxeyê de nehatiye.



Gönüle hücum etti iki kahraman gibi meydana atılan gözler
Savaş meydanında sağlı sollu yerini aldı hemen zülüfler

Şeker saçan tatlı bir sihirdir i'cazlı şiirin senin **Mela**
Bilirim, bu uslubla ifadeyi lal dudaklardan almışsın elbet

## 18

Ardıç ağacı gibi boyu bosuyla salınan sevgili
Bir buse verince bize, kopardı yüz kıyamet

İhsan edip lutf eyledi önce bir buseyi
Cezalandırdı bizi bunu sayıp garamet

Yıkasın diye tüm kir ve paslardan gönlümüzü
Sundu bize sadef kadeh içinde remizlerle keramet

Senin mest olmuş kan dökücü gözlerinden
Ey gözümün nuru, kim görmüş ki selâmet!

İğnelerle sivri ok uçlarının verdiği keder ve acılar var
Görünmekte gönül ve gözlerimizde buna alamet

Aşkın rüsvası olmuş yalnız ben değilim
Kim tatmış ki aşkı, olmadan melâmet

İki kez secdeye gitmek farz olur önünde
Görününce o güzel endam ile o kamet

Sakın suçlama bade içen rindleri sevgiliye
Çünkü onunla nefisler ulaşmış kemale

Boş yere geçirdi bu ömrü **Mela**
Çekerek bunca kahr u nedamet

## 19

Sevgilisiz bir ömür geçirdim boş yere
Yazıklar olsun ki geçirmişiz bu ömrü boş yere

Sakın gönlü nâ-ehillere emanet etme
Nâ-ehillere verdik biz bu cevheri boş yere



Da di seyra ‘işqê dil bêxwe dilîr
Lê dibit seyra ku bêdilber ‘ebes

Pur di pê weslê me se‘y û cehde da
Cehde û se‘ya me hatin der ‘ebes

Dest nehêlîn em ji se‘y û cehdê[13]
Cehde û se‘ya me naret her ‘ebes

Ahi wê kuştim bi derba xencerê
Ma di mêlakê diret xencer ‘ebes

Dil ji derba kaşuwan bû parepar
Go di meydanê dibit sed ker ‘ebes

Mehdera vî suxteyî îro biken
Ez dibêjim nabit ev mehder ‘ebes

Kifş e me‘na kî li lewhê sîmi dî
Nuqteyê misk û xetê ‘enber ‘ebes

Da **Mela** hişyari bî lê pur kesan
Sîne pur lêdane seng û ber ‘ebes

## 20

Navê ‘enberşikenê bê û ji ‘enber meke behs
Bil ji wê silsileyê zulfê mu‘enber meke behs

Veke lêvê û ji nêvê biwerîn qend û nebat
Ji lebê le‘lîşekerbêj û ji şekker meke behs

Bi serenguştê ‘eqîqî bide şehkasê rehîq
Abê heywan tu nihin navê ji Kewser meke behs

Dê beşaretê bi îşaret ji neyê bête sima‘
Tu ji nayê di sima‘ê bike bawer meke behs

Zeriyyên şubhet durdane ku bin şahidê bezm
Ji genimgûn û siyehçerde û esmer meke behs

Dê nihanî bi deraxûş bidey canê şîrîn
Şaxê ‘umrî bixwe ber jê û ji Qeyser meke behs

13 Ev beyte di gelek nusxeyên dî de nehatiye.



Sakın girme aşk yoluna sevgilisiz
Çünkü bu yolda dilbersiz yürüyorsan gider emeğin boş yere

Çokça çabalayıp durduk vuslat peşinde
Lakin bu çabamız da gitti boş yere

Yine de bırakmayalım biz çabalamayı
Gitmez çünkü bunca çabamız boş yere

Ah, öldürdü beni hançer darbesiyle sevgili
Hançer ciğere saplanır mı hiç boş yere

Kâşuvan darbeleriyle pare pare oldu gönül
Sahadaki goy hiç ayrılır mı yüz parçaya boş yere

Şefaat edin ne olur bugün yanıp tutuşan bu aşığa
Ben derim ki inşaallah bu şefaat gitmez boş yere

Yârimin güzelliği ortada, kim görmüş gümüş levha üzerinde
Misk taneleriyle amber çizgilerini boş yere

Sakin ve hüşyâr ol **Mela**, yoksa
Pek çoğu sinesini taşlarla dövmüştür boş yere

## 20

Büklümlü amber saçları anılınca amberden söz etme artık
O zülüflerle, salınmış saçlardan gayri amberden söz etme artık

Dudaklarını aç da onlardan şeker gibi tatlı sözler saç etrafa
Şeker gibi tatlı lal dudaklardan konuş, şekerden söz etme artık

Akik gibi parmaklarında saf şarap dolu kadehi sun bize
Abıhayat ne ki bunun yanında, Kevser'den de söz etme artık

İşaretle anlarsın müjdeyi dinleyince neyden
Tasdik eyle neyden dinlediğini, başka şeyden söz etme artık

İnci tanesi gibi sarışınlar olunca meclisin güzelleri
Buğday tenli esmer güzellerden söz etme artık

Sevgili ile kucak kucağa iken vereceksin ona o tatlı canını
Lezzetle ye ömür dalının meyvelerini, Kayser'den söz etme artık



Ayetê husnê mufessel ke ji keşşafê cemal
'Ilmê 'işqê bike tefsîr û ji defter meke behs

Razê dehrê ji sipihrî tu nizanî bi cedel
Hikmetê Dawer e tu j'hikmetê Dawer meke behs

Avê heywan te divêtin tu bibe hemrehê Xizr
Camê Cem bîn û ji Dara û Sikender meke behs

Ji ezel 'aqîbetê karî ku me'lûmi niye
Camê mey noş û ji teqdîrê muqedder meke behs

Dilê yarê me nebû nermi bi sed av û meger
Ji dilê dilberê ma û berê mermer meke behs

Tîri sed têne ceger sîne li ber bûye çeper
Ji dil û cergê kul û sîneyê ker-ker meke behs

Şîrê elmasî kişînit tu ji lami' de xeber
Vekerit huqqeyê yaqûtî ji gewher meke behs

Ji şefeq Zuhre xuyabit tu binê Perwînan
Cebhetê ew binumêtin tu ji Xawer meke behs

Li rûyê yarê du mehê new me qiran dîn demek
Tu bi seyra Qemer û tali'ê exter meke behs

Pur ji dêmî te xeber daye **Mela**yî
Nezerê wer bide bejnê ji mufesser meke behs

## 21

Tu sehergeh bi temaşa were bazarê hudûs
Lê ne bêfaîde azarî nedet xarê hudûs

Da jibil xunçelebek nazik û ter nebijêrî
Bi tebessum bi te ra bit ji gulistanê hudûs

Sed girih min di dil in jê ku çep û rast biket
Şahidê husn qidemê zulfê girehdarê hudûs

Bil ji sultanê qidem min bi kes îqrari niye
Ger li kama me nihin metqeb û bizmarê hudûs

Dil di deryayê qidem Qaf e bi sabit qedemî
Gerçi li serê ferq e me minşarê hudûs

Beyan et güzellik ayetini mutlak cemalin keşşafından
Tefsir edip açıkla aşk ilmini, defterden söz etme artık

Cedel yoluyla anlayamazsın feleklerin seyrinden âlemin sırlarını
Allah'ın takdir ve hikmetidir, hikmetinden söz etme artık

Hızır'la yol arkadaşı ol, abıhayatı istiyorsan eğer
Getir câm-ı Cem'i sun, Dara ve İskender'den söz etme artık

Bir işin akıbeti önceden malum değilse eğer
İç mey kadehinden, mukadder takdirden söz etme artık

Yüz kere gözyaşı döksek de yumuşamaz gönlü sevgilimizin
Ne katı gönüllü dilberden, ne de sert mermerden söz etme artık

Yüzlerce ok saplanmış ciğere, yüzlercesine kalkan olmuş sine
Yaralı gönül ile ciğerden ve pare pare olmuş sineden söz etme artık

Sevgili elmas kılıcını çektiğinde, parıldayan şimşekten haber ver
Yakut dolu hokkasını açtığında cevherden söz etme artık

Doğup görününce şafakta Zühre yıldızı, Süreyya'ya bak
Sevgilinin yüzü görününce, Güneş'ten söz etme artık

Mest olmuş yârin yüzünde, yeni doğmuş iki hilal gördük bir an
Ne doğan Ay'ın seyrinden, ne de parlak yıldızdan söz etme artık

Çok söz ettin sevgilinin yüz güzelliğinden ey **Mela**!
Gel yârin endamını seyret, rivayetlerden söz etme artık

## 21

Seher vaktinde seyre gel pazarına hudusun
Hazer et, boş yere incitmesin seni, dikenleri hudusun

Gönülden sadece o ter u taze, gonca ağızlı sevgiliyi seç ki;
Bir tebessüm versin sana gülistanından hudusun

Yüzlerce elem ve ukde bıraktı gönlümde o ezeli güzellik sultanı
Gösterince sağdan soldan büklümlü zülüflerini hudusun

İnanmam, tasdik etmem ezel sultanından gayrını
Delseler de âşık kemiğimi matkap ve çivisiyle hudusun

Kaf dağı gibi sabit kademdir gönlümüz ezel denizinde
Başımız üstünde sallansa da her dem testeresi hudusun



Belku dîwari bi guh bin bi Xudê ke bi Xudê
Bi çu rengan nekerî eşkere esrarê hudûs

Lem'eyek ger ji kinarê qidemê pertewê det
Dê ji ber wê se'etê mehwi bin enwarê hudûs

Ber vê sed pencereyan daye şi'a'ê qidemê
Gunbedê 'işqê ji ser kursiyê [dew]warê hudûs

Tu hudûsê we mebîn qenci nezer dî carek
Li esasê qidemê daniye dîwarê hudûs

Bide eslê xwe we tertîbê qiyasê jê ke
Ger nizanî çi ye yekcari berê darê hudûs

Ateşê 'işqê şibî zêr wucûdê hel [di]ket
Heye mumkin nefirit zîbeqê ferrarê hudûs

Ellah Ellah ku di 'umrê xwe tu carek nebihî
Çi seda têt ji vê gunbedê dewwarê hudûs

Tu ji ber perdeyê wehmê were der da bibihî
Çi newa têt bi sed nexme ji ewtarê hudûs

Hal û musteqbel û mazî di xwe da têki yek in
Subh mewcûd e bi 'eynê xwe di êvarê hudûs

Rast û çep gav û se'et her li me ew datînit
Zulfeqarê qidemê Heyderê Kerrarê hudûs

Rast û evraz û nişîvî me buwarin yek yek
Lê tinê wê li me bû daîre berwarê hudûs

Dê li qelbê me çi det lami'eya Îslamê
Ku li canê xwe me xef bestiye zunnarê hudûs

Jeng û rengê hedesê neqşê hudûsê me di dil
Bide ber rendeşê 'işqê ew e qessarê hudûs

Can li ser destê nihayî di riya canan da
Rûh sef sef ku vewesta ne di bazarê hudûs

Dê ji xeflet biretin saya zewalê ey dil[14]
Rûnenê da tu emanet li siha darê hudûs

---

14 Di nusxeyên dî de piştî vê beytê beytek dî heye lê ew di vê nusxeyê de nehatiye.



Duvarın kulağı vardır, Allah aşkına gel sakın
Ne türden olursa olsun, izhar eyleme esrarını hudusun

Kıdem canibinden bir lem‘a parıldarsa eğer
Mahvolup söner o anda tüm nurları hudusun

Yüzlerce pencereden ışıldamaktadır şuaları kıdemin
Kürsî üzerine kurulu aşk künbedinde dönüp duran hudusun

Gelişigüzel bakma varlık âlemine, iyice nazar kıl bir kez ona
Çünkü kıdem temelleri üzerine oturmuştur duvarları hudusun

Kendi aslına dön de ordan yola çıkarak yap kıyası
Eger bilmiyorsan meyvesi nedir şecere-i hudusun

Altını nasıl eritirse ateş, öyle eritir varlığı aşk ateşi
Ne mümkün fırlayıp kaçmasın sağa sola uçan civası hudusun

Allah Allah, ömründe bir kez olsun duymaz mısın acep
Ne sesler gelir, bu durmadan dönüp duran kubbesinden hudusun

Vehim perdesini yırtıp dışarı çık ki işitesin
Yüzlerce nağme ile nevalar döküldüğünü tellerinden hudusun

Mazi, hal ve istikbal, tümü birdir bunların aslında
Hadd-ı zatında mevcuttur sabah, akşamında hudusun

Vurmaktadır bize darbelerini sağlı sollu her lahza ve saatte
Tıpkı Haydar-ı Kerrar gibi kıdem Zülfikarıyla hudusun

İnişli çıkışlı, düz ve eğri yolları aştık birer birer
Lâkin bizim dolaşıp çıkamadığımız bir daire oldu yolu hudusun

Nasıl parıldasın ki, hidayet olan İslam'ın ışığı kalbimizde
Gizlice bağlamışız bu canımıza zünnarını hudusun

Hadeslerin pasları ve renkleri nakışını işleyip yer etmiş gönülde
Aşk rendesine teslim et onu, odur temizleyicisi hudusun

Sevgili yolunda avucumuza aldık ruhumuzu
Ki ruhlar saf tutup durmaktadır pazarında hudusun

Zeval vaktinin gölgesi ansızın çabuk geçer ey gönül
Tavsiyem o ki sana, oturma gölgesinde şecere-i hudusun



Da nîgarê xwe bi sed rengî bibînî herdem
Were seyrê bike carek tu li etwarê hudûs

Tu bi halê me dizanî çi ye her lehze **Mela**
Me di dil têt û neret xencerê xeddarê hudûs

## 22

Şimşadîxeram û serwîxennac
Canan diberit bi ‘işwe tarac

Min dî seherê di xwabê mestî
Bêdeng tezerwê lalê durrac

Bişkifti ji xunçe nêrgiza mest
Bû ferqi ji ser qedîfe dîbac

Cebhet keşşifî ji subhê sadiq
Nûrê ku veda li ser şebê dac

Elmasî numane şubhê misrî
Danîn cegera me dil kir amanc

Nesrîn û binefşe tewwizandin
Mawerd direşande şûşeyê ‘ac

Cohtê hebeşan bi terfetil‘eyn
Anî qederek ji Espehan bac

Sîma ku numa nema li hiş sîm
Sîmabê ji xucle mayî re îxrac

Mîr’atê Sikenderî li pêş e
*Behrun we leha’l-‘ukûsu emwac*

Dora Qemerê ji ber şefeq da
Ku spêde li ferqê ser niha tac

Çerx û felek û melek diyar in
*Şemsun we kewakibun we ebrac*

Zuhre bi qeranê qabê qewseyn
*We’n-necmu iza hewa bi midrac*

Dengê melekan zimîne zimzim
Erwahi ji ‘işqê têne mi‘rac



Sevgilinin güzelliğini yüz renk içre göresin diye her dem
Bir kez olsun gel de seyrine dal etvarına hudusun

Bilirsin her lahza hâlimizin ne olduğunu **Mela**
Saplanmaktadır her dem gönlümüze gaddar hançeri hudusun

## 22

Şimşir ağacı gibi işveli, servi gibi cilveli
Talan edip almada, işve ile canları

Seher vakti gördüm onu gözleri mahmur
Sülün gibi sessiz, turaç kuşu gibi lâl

Çıkmış tomurcuklarından mestane nergis
Çatlatmış kıyafetini kadife kumaş üzerinde

Göründü yüzü sevgilinin fecr-i sadıktan
Aydınlattı nuru karanlık geceye benzeyen zülüfleri

Göründü elmas gözler Mısır kılıçları gibi keskin
Gönlü hedef alıp darbelediler ciğeri

Süslenmiş, yaban gülleri ve menekşelerle
Serpmekte üstüne gülsuyunu fil dişi şişelerle

Bir çift siyah göz, çok kısa bir zamanda
Alıp getirdi İsfahan'dan haracı, bol miktarda

Görününce yüzü sevgilinin hasedinden kalmadı gümüşte akıl
Çıkmadı dışarıya gümüş suyu utancından

Önünde İskender'in aynası var sevgilinin
Güzelliğinden akseden dalgaları var o denizin

Beyaz bir taç gibi oturunca başına şafak
Aydınlattı Ay'ın etrafını o nurla ancak

Feleklerle melekler aşikârdır bu raks halkasında
Güneşler, yıldızlar ve beraberinde burçlar

Zühre yıldızı yakın durmakta iki yay arasına
Batış yönünde Süreyya yüz tutunca guruba

Meleklerin sesleri arı uğultusu gibi çınlayıp durmakta
Aşka gelmiş ruhlar yükselip miraca çıkmakta



Dil behr e we sed hezar mewc in
Arif çi xeber ji behrê mewwac

Borî û bi xencekî **Mela** kuşt
Ew xunçeleba dilan e xennac

## 23

Dil ji ‘îlacê ku biderket mîzac
Dê ji lebê noşî ‘eta bit ‘îlac

Ayîneyê camê cihanbînê Cem
Badeyê le‘lî ne di cama zucac

[Ji] ava heyatê bi me da şerbetek
Zinde kirîn ma ji ‘edû ra neşac

Bendî kirim ger çi şibih fîli bûm
Sîmîbera sa‘id û bazû ji ‘ac

Exter û îqbal û Mehê burcê bext
Mihr û sipihr û kemer û text û tac

Kûsê ku hinga[f]ti bi şahî li text
Padîşehan neqdê rewan da xerac

Xusrewê Şîrînê li derbendê husn
Sîmîberan lazim e lê mehr û bac

Sikkeyê şi‘ra me bi pasê dihat
Lew bi ‘eyarê di cehan da rewac

Abê rewan min diye şi‘ra **Melê**
*Yunkiru li’l-mai li sûi’l-mizac*

## 24

Dîsan ji nû bêhal e dil saqî werîn cama zucac
Muştaqê xemra al e dil dê xwoşi bit û çêbit mîzac

Saqî ku dêm mehweş bitin kakul ji şêva reş bitin
Qerqef bila ateş bitin em dê bi wê dil keyn ‘îlac

Da em bi wê dil hey bikeyn pê sîne dax û key bikeyn
Sed menzilan pê tey bikeyn ew dê di seyrê det rewac



Yüz binlerce dalgası olan bir denizdir gönül
Haberi yok arif olanın bu çok dalgalı denizden

Geçip gitti bir cilve ile öldürüp **Mela**'yı
O gonca ağızlı, işveli, fettan sevgili

## 23

Gönlün tabiatı tedaviye müsait olmayınca
Tatlı dudaklardan ilaç vermek gerektir ona

Cemşid'in dünyayı gösteren kadehi ayinedir
Cam kadehteki lal gibi kırmızı bade

Öyle bir şarap sundu ki bize abıhayattan sevgili
Zinde kıldı ruhumuzu, düşmana da ağlayıp sızlamak kaldı

Esir kılıp bağladı beni fil gibi güçlü olsam da
Fildişi kol ve bilekleriyle gümüş göğüslü sevgili

Kemeri İkbal yıldızı, tahtı Ay ile saadet burcudur
Feleğin Güneş'i taç olmuş sevgilinin başına

Çalınca sevgili tahta çıkış davulunu
Ödemeye başladı hemen sultanlar haraçlarını

Güzellik ülkesinin sultanı Şirin'in Husrev'ine
Vermeleri gerek gümüş göğüslü güzellerin mehr ve çeyizlerini

Gam ve kederle anıldığı için şiirimizin sikkesi
Değeri ve ayarı ile buldu dünyada revac

Akan bir nehir gibi gördüm ben şiirini **Mela**'nın
Su-i mizacındandır varsa inkâr eden bu suyun tadını

## 24

Hâlsizdir yine gönül, getir cam kadehini ey saki
Sulandırılmış kırmızı tatlı karışımlı şaraba müştaktır gönül

Yüzü ay, kâkülleri de karanlık gece gibi olunca sakinin
Sunduğu şarap ateş de olsa tedavi ederiz gönlümüzü onunla

Onunla diriltelim gönlü, onunla yakıp dağlayalım sineyi
Onunla aşalım yüzlerce menzili, odur bu yolu değerli kılan bize



Bênûr û narê muhbetê bêneqş û wez‘ê qudretê
Naçîn meqamê wesletê nûrun lena we’l-leylu dac

Ev narê sîqala dil e daîm li wî qala dil e
Newroz û sersala dil e weqtê hilêtin ew sirac

Hetta bi nûra badeyê rengîn nekî siccadeyê
Dûr î ji wê şehzadeyê durdaneya gerden ji ‘ac

Durdaneya gerdenbilor reyhan ji ser werdên di cûr
Hey hey bi mestî têne dor xala li nik ferqê bi tac

Mihra te pur ebter kirîn xalan ji ber biskan [d]erîn
Zulfa muselsel ‘enberîn çîn çîn ji Çînê têti bac

Tenha ne Kurdistan didin Şîraz û Yeng û Wan didin
Her yek li ser çavan didin hem ji Espehan têtin xerac

Çavên belek qewsê helek çerx û felek xalib melek
*Fî hubbiha ‘umrî delek we’l-hubbu yecrî fî ‘ucac*

Şahid hezar reng xemmilîn reqs û semayê kemmilîn
Îro **Mela** em sed dil în saqî werîn cama zucac

## 25

Heyf e vî ra xak û gil bit ‘arifê çalakirûh
Dê mucerred bit ku pertew det ji nû ew pakirûh

Qeydê xak û gil nebî da bê hîcab û perde bî
Mislê bedrê canan têxit xusûfê xakê rûh

Şem‘ê serrê nûr nadet ger neket perhîzê dil
Zewqê cama ‘işqê naket ger neket îmsakê rûh

Dil bi tayek nêrgizan duh nazikek terwende da
Gul [d]ikin teşbîhê xaran her xes û xaşakê rûh

Camê ‘işqa pakê rûhanî tuhûra batin e
Ê şewwişî her we ma hetta ebed napakirûh

Hey’eta keyf û kemê bêkeyf e keyfa ‘arif e
Dê bimînit ger nebit naçari bê tiryakî rûh

Dê bi gulzara cemala sebzepoşan dê çi bit
Ê di mihrê da nebî dil parepare çaki rûh



Olmadan sevginin nuru ve ateşi, kudretin sanatı ve nakşı
Ulaşamayız vuslatın makamına; nurumuzdur o, karanlık gecelerde

Gönlü parlatan ateştir bu, düşürmez dilinden onu hiç
Yılbaşı ve nevruzudur gönül için, tutuşup yandığında bu kandil

Şarabın nuruyla renklendirmedikçe seccadeyi
Uzak kalırsın o fildişi gerdanlı, inci tanesi şehzadeden

O billur gerdanlı dürdanenin, elvan gülleri üzerinden reyhanlar
Mestane titreyerek tâcına yakın duran ben'lere dolanırlar

Sevgin deli divane etti bizi, göster benlerini kâküllerin altından
Amber kokulu müselsel zülüflerine Çin'den dalga dalga haraç gelir

Sadece Kürdistan değil, Şiraz, Yeng, Van da haraç vermekte
Gönül hoşluğuyla vermekte her biri, ki İsfahan'dan da gelmekte

Siyah gözler, yay kaşlar ve rakstaki melek gibi güzeller uğruna
Şiddetli fırtınalar içinde geçen bir aşkla ömrümüz telef oldu

Bin bir renk içre süslenmiş güzeller tamamladı raks ile semâ'ı
Yüz gönül var bizde bugün **Mela**, getir içelim saki cam kadehi

## 25

Yazık bu çalak ve arif ruha ki esir düşmüştür toprakla balçığa
Parlarsa yeniden eğer soyutlanıp kurtulur bu pak ve latif ruh

Olmasın toprakla balçık bağı, kalksın aradan hicab ve perde
Çünkü toprak, sevgilinin ay yüzü gibi, sevk eder ruhu tutulma hâline

Işık vermez mumun başı eğer içi temiz değilse pisliklerden
Aşk kadehinden zevk almaz bir ruh, çekmezse elini maddeden

Nergis gibi ter u taze bir sevgiliye ver gönlünü
Alçak ve sefil ruhlu olanlar dikene çevirir çünkü gülleri

Temiz olan ruhani aşkın kadehi, yıkayıp temizler batını
Müşevveş olup içmeyen bu kadehten ebede dek kirli bırakır ruhunu

Gerçekte bir keyfiyyet yok nitelikte, arif olandadır asıl keyfiyyet
Çaresiz kalır insan eğer yoksa ruha tiryak olacak bir nesne

Aşk yolunda gönlü parelenip ruhu parçalanmış olmayanın
İşi yok hurilerin güzellik bahçesinde dolaşmaya



Pur ji can derrakeyek rewşentir û wala divê
Sûreta husna muqeddes da biket îdrakê rûh

Ger xeberdar î ji sirra “kuntu kenzen” guh bidêr
Da bi sed terzan beyan key me‘nayê “lewlak”ê rûh

Lami‘ê sirra tecella ser li Tûra dil didet
Zebt naket wê mecalê sed hezar eflakê rûh

Herdu îlanên tinê min toqê gerden bin medam
Da me her bêtin tebessum wek gula dehhakî rûh

Cewherê husnê eda tenha dibit meqbûliteb‘
Ger ne siqal det bi nûrê ‘işqê wek hekkaki rûh

Dê bi vê endaz û terzê bibit sihrê helal
Ger ne balateb‘ bit wek pehlewan çalaki rûh

Dil bi rim avête li vê bari kir qewsê şevî
Dê bidet ber gezmeyan bê sûci ew seffaki rûh

Şehsuwaran pur-kemend avêtine qelbê **Melê**
Bend naket xeyrê fitrakê te sed fitraki rûh

## 26

Pur meke îsrafê li qetlê mubah
*Sefku demi’l-aşiqi ma la yubah*

Sîne bi destê xwe mubarek veke
*Te‘rife kem fî kebidî min cirah*

Dil ji hewaya te di fikrên di kûr
*Fî lucecin beyne hubûbi’r-riyah*

‘Işq geha kê û li ‘eqlê xwe ma
*Yeftiku bi’l-aqili aşiqu’l-melah*

Bûsezenan her kî ber an asitan
*Meskeni min cebhetihî la burah*

Dîsa li ser çeşmeyê ma xak rîxt
Xakê rehê yarê seba her sebah

Toz û xubarên seherê ber çimen
*Qed neşere’t-tîbe we bi’l-miski fah*



Ruhtan önce, çok yüksek ve parlak bir idrak gerek
Ta ki ruh anlayabilsin mukaddes güzelliğin suretini

Eğer haberdar isen "Küntü kenzen" sırrından, iyice kulak ver;
Ki, açıklayasın, yüz cihetle ruhun "Levlâke" manasını

Tecelli sırrının parıltısı gönül Tur'una da ulaşır nihayette
Zabtedip tutamaz ruh o mecali yüz bin eflâk ile

Zülfünün yılanvari iki örgüsünü kolye yapıp taşıdım boynumda
Ta ki yeni açılmış bir gül gibi tebessüm etsin ruhuma

Güzel üslub ve ifade hoşnut eder mi insanı tek başına
Ruh onu bir hakkâk gibi aşk nuruyla cilalamadıkça

Bu tarz ve ölçüyle nasıl olur ki beyanın sihri helal
Çalak bir pehlivan gibi yüksek tabiatlı olmazsa ruh

Yükledi üstüne gecenin oklarını, gönlü mızrakla yığıp yere
O kandökücü sevgili, oklara hedef kıldı bizi suçsuz yere

Binicilerin şahı çokça kement atmış bugün **Mela**'nın kalbine
Yüz kement de olsa bağlayamaz kimse bu ruhu bağından başka

## 26

Fazla israf etme senin için mübah sayılan kıtalde
Âşığın kanını dökmek elbette olmaz sana mübah

Kendi mübarek ellerinle aç sinemi
Ki görüp anlayasın cigerimin ne kadar yaralı olduğunu

Aşkından pek derin hülyalara dalmakta gönül
Rüzgâra kapılmış engin sular arasında

Aşk kime ulaştı da bıraktı onda akıl
Öldürür aşığı sevgilinin dayanılmaz güzelliği

Sevgilinin eşiğine yüz sürüp öpen her bir kişi
Kalakaldı çaresiz başını kaldırmadan

Yâr yolunun toprağını bâd-ı sabâ her sabah
Yine saçtı gözlerimize yolunun tozundan

Yârin bahçesi önündeki tozu toprağı sabahları
Dağıttı etrafa misk gibi güzel kokularla



Fêris û rimbaz gihan yek bi tîp[15]
*Ehmedu fi'l-beyni qetîlu'r-rimah*

Husnê edaya te **Mela** her kê dî
*Sehhe lehu enneke zeynu'l-fisah*

## 27

'Işqê ku biden bi yekdu erwah
Peyweste divê bi hev bin eşbah

Can û cesedan ku îttihad e
*We'l-mau lehu'l-mizacu bi'r-rah*

Wesla te li can û dil heyat e
*Men zaqe mererete'n-newa tah*

Tenha ne di sîne min xedeng in
*Min lehzike fî'l-qulûbi ermah*

Perwîn ji şefeq seher xweya bûn
*La bid'e we fîhi minke esbah*

Bûm mest mine'l-hewayî ileyke[16]
*Min xemretina tedûru eqdah*

*Ifteh bi liqake qufle qelbî*
*Fe'l-qelbu lehu liqake miftah*

Seyyahi me dîn di xelwe îro
Ellah çi xelwe û çi seyyah

Berqê ku veda ji ber nîqabê
*We'l-lami'u min senahu qed lah*

Qews û qezehan numa ji bala
*We'l-'enberu min şuzahu qed fah*

Ayîneyê dilê **Mela** cela da
*Min tel'etihi feqed seqe'r-rah*

---

15 Di nusxeyên dî de piştî vê beytê, beytek dî dihat.
16 Di vê nusxeyê de beytek li vir kêm hatiye.



Birbirine girişti yiğitler kılıç ve oklarla
Ahmed mızrak darbeleriyle maktuldür şimdi aralarında

Ey **Mela**! Her kim tanık olduysa güzel uslubuna
Demesi doğru olur, senin fasahatin ta kendisi olduğuna

## 27

Ruhlar aşk ile bağlanınca birbirlerine
Bedenle ruhun denk olması gerek yek diğerine

Ruhlar cesetlerle nasıl kaynaşmışsa
Su da karışmıştır şarapla öylece

Vuslatın hayat verir can ile gönüle
Ayrılığın elemini tadanın helâktir sonu

Oklarla yaralanan bir tek sinem değildir
Gözlerinden gelen mızrak gibi gamzeler var kalbimde

Süreyya göründü şafakta seher vaktinde
Garip değil, nurundan kandiller var içinde

Sana olan aşkımdan sermest oldum
Kadehler dönüp durur aşkımızın şarabından

Dîdârın ile aç, gönlüme vurulmuş kilidi
Seninle görüşmektir çünkü kapalı kalbin anahtarı

Halvette gördük bugün her an dolaşıp duran seyyahları
Yarabbi, ne aceptir bu seyyahların bu halveti

Şimşekler çakınca sevgilinin peçe altındaki yüzüne
Nurlar saçılır her tarafa onun göz kamaştırıcı güzelliğinden

Yükseklerden görününce sevgilinin eleğimsağma renkleri
Yayılır etrafa keskin amber kokuları

Cilalanıp parladı gönül aynası **Mela**'nın
Parıltısından temizlenip duruldu rengi şarabın



## 28

Ahê ji derdê dil [d]iket herçî nedî azarê çerx
Derbê li nava dil didet lami'sifet nûbarê çerx

Tên sîneyan peykan nihîn amancê tîran her em în
Dava belayê der kemîn her goşe du marê çerx

Bîra xwe tînin qenceyan 'aşiq di nêv îşkenceyan
Tavête dil ber pe[n]çeyan herdem ji nû şinqarê çerx

Kan ew letîfa gul'izar lew tên ji bulbul ah û zar
Şûna gulan restîne xar di nêv çemenê gulzarê çerx

Sed baziyan ev huqqebaz tînit bi hîle karisaz
Geh kok û taze geh niyaz sehhari pur mekkarê çerx

Herçî bixwûnit suhbetê axir di cama şerbetê
Zehra helahil dê detê da dil neden azarê çerx

Ev erreyê jehrî û nan min jê di dil da ev sinan
Ma her li ferqê dijminan bêt û biret minşarê çerx

Dijmin ji can talan dibin ew xwe hero walan dibin[17]
Mêlak û dil kalan dibin dê bêt û ret xeddarê çerx

Şemsî bi şemsî cam bi cam hetta bikin dewrê temam
Ateş dirêjit her medam ev gunbedê dewwarê çerx

Agir di av û gil dikit qelban ji qelban hil dikit
Metqeb di can û dil dikit daîm ev ateş karê çerx

Çendî di xûba tên rezim min jî di dil da yîn gizim
Amancê remzên wan ez im ser'eskerê seyyarê çerx

Kes dî li lewhê sîne qet neqşek veha tê der xelet
Her dem ji nû yek taze xet tavête ber perkarê çerx

Min pir şevan hetta seher danîne rê şem'a beser
Ew mahîrû ma bête der mayîme newbetdarê çerx

Me j'hesreta şîrînleban xew ney ji çavan bir nîşan
Firyad diden ber kewkeban pursê meke j'bîdarê çerx

Karûreyên himmetbulend berdane meydanê semend
Sergeşte yîn hetta bi çend ev rekb û meş'eldarê çerx

---

[17] Beytek piştî vê beytê heye ku di vê nusxeyê de nehatiye.



## 28

Gönül derdinden âh çeker mi hiç, feleğin azarını görmeyen
Feleğin oku parlak bir şimşek gibi ortasından vurur darbesini

Sinelere yöneltilmiş oklar gizlice, hedef biziz gerçekte
Pusuda iki yılanlı bela tuzağı kurulmuş feleğin her bir köşesinde

İşkence altındaki âşıklar anarlar hep o kancaları
Lakin feleğin şahini her dem pençesini atar yeniden gönüllere

Nerde o bülbüllerin ah u zar ettiği gül yanaklı dilberler
Feleğin çemen gülzarında onların yerini almış şimdi dikenler

Yüz türlü oyun oynamakta bize bu hokkabaz, hilelerle
Oyalamakta bizi sihirbaz ve düzenbaz felek naz ve işvelerle

Kimi davet etmişse sohbetine, sunmuş şerbet kadehini ona
İçirmiş öldürücü zehri, gönül verme sakın feleğin azarına

Zehirli bıçkının dişleriyle sivri oklardır gönlüme saplanan
Düşmanların başında dönüp dursa feleğin testeresi olmaz mı?

Talan ediyor ruhları düşman, inleyip duruyorlar her gün acıyla
Parçalıyor ciğerleriyle gönülleri feleğin gaddar kılıcıyla

Büyük kadehleri küçükleri izler devir tamam oluncaya dek
Ateşten belalar yağdırır durmadan feleğin dönüp duran bu gökkubbesi

Suyu ve çamuru ateşe verip kalpleri kalpler ile yakmakta
Matkapla delmede canları, bu ateştir her daim feleğin işi

Savaşmak için meydana her indiklerinde yara alır gönlüm
Çünkü felek ordusunun komutanın hedefi bizzat benim

Kimse görmüş mü gönül levhasına hatayla böyle bir hat çekildiğini
Her dem yepyeni bir hat örneği gösterir felek pergeli bize

Yola diktim gözümle kulağımı çok geceler seherlere kadar
Belki gelir diye o ay yüzlü, bekleyip nöbetçisi oldum feleğin

Tatlı dudakların hasretinden gözler uyku tutar mı hiç geceleri
Yıldızlara çıkar feryadımız, sorma bizi feleğin uyanık kalanına

Salmış atlarını meydanlara yüksek himmet sahibi bu yıldızlar
Ne zamana dek feleğin meşalesini taşıyan şaşkınlar olacağız



Gavek ji dengê zengilan êmin çi rûnîn menzilan
Hey hey bibînin mehmilan firyad ji her qentarê çerx

Pur min ji vê çerxê **Mela** kêşane afat û bela
Ebleh dibînim wî hela herçî ji dil bit yarê çerx

## 29

Dilberê îro seher havête cergê min du dox
Yek li sîne yek li dil da lew ji min tên ax û ox

Ah û oxên min ji dil tên lê ji ber tîra qizil tên
Yan ji kovanê[n] di kul tên jê dizên her kêm û zox

Xwûn ji dil co co rewan tê wek ‘eqîq û erxewan tê
Lê ji dest selwa ciwan tê ew şepala şeng û şox

Ew şepala şox û şeng e kafira Rom û Fireng e
Dame ber cotek xedeng e zalimê kuştim bi dox

Zalimê kuştim şepalê nazikê qencê delalê
Bûn hicaba zulf û xalê bêrq û ‘ala û tox

Bêrq û tayên bi rêşî ê di zerrîn pê ve wêşî
Min du fêris dîn di pêşî mirwet û insafi yox

Lew heriftim ez ji meylê şubhetê sehlê we seylê
Muhbet û ‘işqa te Leylê ez kirim yekser pilox

Dest nehêlim ez ji dînê şibet Firhad û Şîrînê
Lê ji ber ‘işq û evînê min di rê çit ev kulox

Suhbeta çerx û sema tê wek **Melê** sed mubtela tê
Zemzem û ava heyatê muşterî sed şêx û şox

## 30

Heyheya reqs û semayê te çi xweş bestiye çerx
Ku di bircê û [sema] têtê her ku li ser dest e çû berx

Sofiyên her di tewafê Heceri’l-eswed qesd e
Ku bulbul bi sema tên hemiyan zimzim e çerx

Neqşê elmasî li elmasi neyê girtiye herf
Xettê yaqûtî li yaqûti şikênandine [n]erx



Nasıl güvende olabiliriz ki, çalarken bu yolculuk çanları
Feryad edip çağırmada feleğin katarları, hep görmedeyiz onları

Çok belâlar, musibetler çektim elinden bu dehrin ey **Mela**
Gözümde ahmaktır gönülden bağlanan bu dünyaya hâlâ

## 29

Dilber bugün seher vakti ciğerime attı iki ok
Biri göğse diğeri kalbe saplandı, ondandır bunca ah u zarım

Gönüldendir bu "ah"larım, ah o kızıl oklardandır
Ya da her dem kan ve irin akıtıp sızlayan yaralardandır

Oluk oluk kanlar akar gönülden, kıpkızıl ve erguvan renginde
Ne var ki bütün bunlar körpe serviden, o tatlı, zarif şuhtan gelir

O tatlı, zarif ve şuh sevgili, Rum ve Frenk kâfiridir
Bir çift oka hedef kılıp öldürdü beni o zalim

Öldürdü beni o letafet ve zerafet timsali zalim
Paşu, perçem ve tuğlar perde olmuş yüzündeki zülüfle benlere

Dizilmiş boynunda altın takılar, salkım salkım süsler
Onların da önünde bir çift acımasız fettan gözler

Kayan toprak, akan su misali yıkılıp kaldım önünde
Bir kor ateşe çevirdi beni ey Leyla senin bu aşkın

Vazgeçemem görmekten onu tıpkı Ferhad ve Şirin gibi
Kesilse de bu baş onun aşkı ve sevgisi yolunda

Yüzlerce aşk mübtelası var bu semâ' meclisinde **Mela** gibi
Yüzlerce genç ve yaşlı, zemzemle abıhayat müşterisi

## 30

Semâ' ve raksındaki sevinç naraları kuşatmış evreni ne güzel
Elleri üstünde raks ederek gelmekte koç burcu ne güzel

Hacerü'l-esved'i tavaftır maksadı sufilerin her defasında
Ki bülbüller birlikte raksedip dönerler benlerin etrafında

Yüzündeki beyazlık gölgede bırakmış elmasın rengini
Yakut renkli hatlar, düşürmüş yakutun değerini



Kerixîn em di qebayê me ji dil perde dirand
'Arifê weqt im û Me'rûfi bila bêt ji Kerx

Da binasî xeterên rê tu nebî xafil bî
Dicle tê di pur in perber û pîl û ber û çerx

Pîrê şe'ar e di şi'rê we **Melê** şalifiroş
Tu nîşan min mede Ferxî ku li nik min bûye ferx

## 31

Neyşekera gerden ji 'ac dîsa ji reştûzên Semed
Qewsê li bala ferq tac keyber reşandin bê 'eded

Keyber reşandin bêhisab misrî ku dan sîqal û tab
Sed Rustem û Efrasiyab kuştin li wan ker kir cesed

Sed padişah û xusruwan can dan di 'işqê we rewan
Nisrîn di lebsê erxewan min dîn li bejna serwîqed

Min dîn li bejna 'er'erîn tayên zubadê 'enberîn
Bayê seba da çenberê zulf çûne ser nûra Semed

[Z]ulf çûne ser nûra zelal carek were bayê şîmal
Biskan ji ser dêmê vemal zulfan ji ser cotê esed

Sehharê cohtê caduwan îro ji remza ebruwan
Dil girt û da ber kaşuwan ker kir li miskînan kebed

Dil girt û da ber xenceran kuştim nigar û dilberan
Me j'destê zulma esmeran dad û meded dad û meded

Dilber ji le'lên xwe'y şefaf da min meya gulgûne saf
Deryayê 'işqê qaf û qaf peyweste têtin cezr û med

Husna munezzeh bêmisal, ser da libasê xett û xal
Sergeşte heyran mayî lal, **Ehmed** ku dî nûra Ehed

Ellah ji nûra sermedî yek qetreyek da **Ehmedî**
Ji şîrînî he[zz]ek we dî medhûşi ma hetta ebed

## 32

Îd e û herkes ji dîdara te lê pîroz e 'îd
Ez tinê mehrûmê dîdar im bi sed menzil beî'd

Her nefes dihnêrim ez cana bi ahan ra ji dil
*Bareke'l-Barî bi is'adin 'eleyha yewme 'îd*



Usandık beklemekten, attık perdeyi gönülden samimiyetle
Zamanın arifi benim, gelip görsün Kerh'ten Maruf-u Kerhî

Gafil düşmeyesin diye öğrenmen gerek yoldaki tehlikeleri
Dicle'dir bu, pek çoktur dalgaları, kayaları ve derin çukurları

Şiirde pîridir şairlerin Mela, satmakta daim bu paha biçilmez şalı
Gösterme bana, yanımda yavru kuş gibi kalan Ferrûhî'yi

## 31

Boyu şeker kamışı, boynu fildişi beyazı sevgili
Sayısız oklar fırlattı yine samedanî siyah kaşlarından

Sayısız oklar fırlattı; parıldadı Mısır yapımı kılıçlar
Öldürüp parçaladı cesetlerini yüzlerce Rüstem ile Efrasiyab'ın

Yüzlerce sultan ve padişah aşk uğruna can verdiler
Nesrinlerle erguvanî giysiler gördüm o servi boylunun üzerinde

Misk ve anber kokan takılar gördüm o ardıç boylunun üzerinde
Saba rüzgârı değince kâküllerine, zülüfler dökülmüş samedanî nurlu yüzüne

Kâküller dökülmüş nurlu yüzüne; esiver bir kez ey kuzey rüzgârı
Çekip uzaklaştır yüzündeki kâkülleri, gözlerini örten zülüfleri

O sihirli fettan gözler kaşlarının remizleriyle bugün yine
Aldı yüreğimi oklarını sapladı, ciğerimi pare pare etti yine

Kalbimi çelip hançerledi, öldürdü beni o sevgili ve dilberler
İmdat aman imdat, o esmer güzellerin zulmünden imdat

İnce al dudaklarından gül renginde saf şarap sundu bana dilber
Bil ki aşk deryası baştan başa med ve cezir içredir daima

Benekli bir giysi var üzerinde, emsalsiz münezzeh bir güzellikte
Hayran kalıp lâl kesildi **Ahmed**, Ahed'in nurunu görünce yüzünde

Sermedi bahrından Allah bir damla verdi **Ahmed**'e
Öyle bir haz, öyle bir tat ki medhuş kaldı ta ebed

## 32

Bayramdır ve herkes seni görmekle bayramı kutlamada
Didarının mahrumu yalnız benim, yüzlerce menzil uzaklarda

Her nefeste gönlümün ahlarıyla mektuplar göndermedeyim sana
Bayram günü Bâri Teala mutluluklar ihsan etsin diye sana



Dergehê lutfa te xanim ma li mehrûman vebî
*Inne kelben basiten dehren zira'en bi'l-wesîd*

Pîre[merd] im 'aşiq im îro mirada min bibexş
*Ya hebîbî ya muradî ya meta qelbi'l-murîd*

*Ferre 'eqlî min lehîbî şibet bazî yû 'iqab*
*Zabe rûhî misle ma tenhelle fî narin celîd*

*Dem'u eynî min bukain mislu maîin fî sukûb*
*Naru qelbî min xeramin fî diramin fi'l-weqîd*

Dil ji ber narê mecazî bi'l-heqîqet bû pereng
*Naru qelbî fî hewahu mislu narin fi'l-hedîd*

Key xilas ez dozexê hicrê to yabem ahi çun
Her nefes dared sela û ne'reyê hel min mezîd

Kî dizanit min ji rimbazan dema oxilme tên
Têne dil sed rim ji wan û sîne tênê sed cerîd

Min ji seffeynan di nava meqtelê rim têne dil
Lê li wan destan nihin xwûna wê xeza ye ez şehîd

Mishefa husn û cemalê sûreta xal û xetan
La telewna xeyre herfi La we Qur'anin Mecîd

Gerçi her daîm ji mihrê neynika dil bedr e min
Wek hilalê subhê têm ez carinan bim nabedîd

Ma bi le'lên canfeza navê me bînit carekê
*Bi'ddua bellix tehiyyatî li Selma ya berîd*

Tu j'**Mela**yê Bohtî pors esrarê 'işqê ew dibêt
Vê mu'emmayê çi zanin sed mela û muste'îd

Er bi kuştin wer bi hiştin emr û fermana te bit
**Ehmed**u 'ebdun reqîqun waqifun beyne'l-'ebîd

## 33

Sirrê wehdet ji ezel girtiye hetta bi ebed
Wahidek ferd e bi zatê xwe û nînin çu 'eded

Di qidem da ezel û 'eynê ebed herdu yek in
Sermediyyet we dixwazit ne ezel bit ne ebed



Lütfunun kapıları açılır mı acep biz mahrumlara, ey sultanım!
Nicedir kollarımı açıp beklemedeyim köpek misali eşiğinde

Yaşlanmış bir aşığım, bahşet artık muradımı bugün
Ey sevgilim, ey muradım, gönlümdeki arzum benim

Bir şahin gibi uçup gitti başımdan aklım aşkının ateşinden
Eriyip bitti ruhum, nasıl erirse bir kırağı ateşi gördüğünde

Bir nehir gibi akmakta gözyaşlarım ağlamaktan
Yanmada kalbimdeki aşk ateşi bir yakıt nasıl yanarsa ateşte

Gönüldeki mecazi ateş dönüştü gerçek ateşten bir cemreye
Kalbimdeki aşk tıpkı ateşin kızgınlığı gibidir demirde

Ne zaman kurtulacağım ey sevgili ayrılığın cehenneminden
Durmadan, "Daha yok mu?" narası yükselmede içinden

Kim bilir ne olur hâlim, savaş için toplandıklarında mızrakçılar
Yüzlerce mızrak saplanır o anda gönlüme ve göğsüme

Savaş meydanındaki saflardan gelen mızraklar saplanır kalbime
Lakin şehit olduğum o gazvede kan izi yok ellerimde

Yârin güzellik mushafında yüzündeki benlerle hatlar sûretinde
Okumadık "illâ" harfinden gayrı, yemin olsun Kur'an-ı Mecid'e

Gönül aynam sevgiden bir dolunaydır gerçi benim
Lakin görünmez bir sabah hilali gibiyim bazen de

Adımızı anar mı acep bir kez olsun ruh ferahlatan dudaklarla
Ey postacı, selam ilet bizden o sevgili Selma'ya dua ile

Gel Botanlı **Mela**'ya sor ki aşkın sırlarını beyan eder
Bu muammayı ne bilir yüz molla ile yüz müstaid

Öldürmek yahut sağ bırakmak emr ü fermanın olur
Durup beklemektedir emrini kölelerinden **Ahmed** kulun

## 33

Vahdet sırrıdır kuşatan evreni ezelden ta ebede
Zatında tektir ve birdir o, taaddüt nerede?

Ezel ve ebed aynı şeydir kıdemiyette
Çünkü ezel ve ebed farkı yok sermediyette



Ferq e wahid ji ehed lê di meqamê semedî
Bi heqîqet ku yek in herdu, çi wahid çi ehed

Yek e derya tu bizan qenc, çi mewc û çi hebab
Di esil da ku hemî av e çi av û çi cemed

Afitaba ehediyyet di xwe da girtiye kewn
Ne ku ‘ewrek heye lê girtiye çehvên me remed

Husn û zatê but û latan ji cemala Semed e
Ji misalê senemî weku tecella ye Semed

Xeyrê derya niye sehra bi heqîqet emma
Ji rûyê keyf û kemê av bûye şubhet zebed

Kulle yewmin huwe fî şe’ni nebî xafil jê
Her peyapey ji şu’ûnan dikirit feyz meded

Ger ti Adem bidiya sirr û ‘ilim Iblîsî
*Hînema ebserehu kebbere hînen we seced*

Çi zeman û çi mekan û çi cihan in çi felek
Çi meqadîr û tefasîl û hisab in çi ‘eded

Çi munafat û luzûm in çi qiyas û çi misal
Ev çi tewlîd e çi terkîb e çi rûh in çi cesed

Ser bi ‘iczê diretin quwwetê derrakeyê ma
*Rece‘e’l-‘eqlu kelîlen we meta qame qe‘ed*

Heyret û ‘icz e serencami di babê nezerê
Key bi Xaliq nezera qasirê mexlûqê resed

Guftûgo çend e **Mela** me‘rîfetê peyda ke
Gewhera me‘rîfetê nagehitê kes bi xired

## 34

Derê butxaneya ‘işqê seher ‘arif ziyaret kir
Bi abê çeşm û xwûnê dil wudû best û teharet kir

Werîn cama hilalî da ji ‘eksê mahê new bînî
Ku xanê mihr û tirkê çerxê xwanê roze xaret kir

Bi mîzan qewsê mahê new bi wechê dilberê min dî
Ji çeşmê goşeyê ebrû bi dûrî cam îşaret kir



Gerçi sözcüklerde farklıdır "vahid" ile"ehad"
Lakin gerçekte yoktur farkları birleştirir onları "samed"

Bil ki deniz aynı denizdir değişse de dalgaları, kabarcıkları
Tümünün sudur aslı, çözülse de çözülmese de buzları

Birlik güneşidir zatında kuşatan tüm evreni
Engel bulut değildir görmeye, gözdeki hastalıktır nedeni

Putlaşmış güzellikler cemalinden yansımalardır "samed"in
Akıl hayret içredir sanemdeki tecellisinden "samed"in

Denizden farkı yoktur sahranın gerçekte
Asıl sır, suyu köpüğe çeviren nitelikte

Unutma ki "o her gün bir şe'n alır"
Her tecelliden sonra feyz ve yardım gelir

Adem'deki ilmin sırrına vakıf olsaydı İblis eğer
Yüceltirdi onu görünce, uzun süre baş eğer

Zaman ve mekân, bu âlem ve felekler, nedir bunlar?
Nedir bu ölçüler, izahlar, hesaplar ve sayılar?

Nedir eşyadaki bu münafat ve lüzumat, bu kıyaslar ve misaller
Nedir bu terkipler ve tahliller, bu ruhlar ve cesetler

Çekemez sıkletini yüksek idrakimiz tüm bunları anlamada
Yorgun düşen akıl, aciz kalır kalkış için her çabada

Şaşkınlık ve çaresizliktir düşüncenin son sınırı
Nasıl anlasın kısır fehmiyle mahluk Halik'ini

Dil döküp durma **Mela** marifet vadisinde kal u kil ile
Çünkü marifet cevherine ulaşmamıştır kimse akıl ile

## 34

Aşk puthanesinin kapısını ziyaret etti arif seherde
Arınıp abdest aldı göz yaşı ve gönülden akan kanlarla

Hilal gibi parlayan kadehi al gel ki yeni ay'ın aksini görebilesin
Güneş'in evi gündüzle semânın kalbine doğan Ay, orucun sofrasını dağıttı

Sevgilinin yüzünde gördüm yeni doğmuş ayı hilal şekliyle
Uzaktan bana kadehi gösterdi kaş-göz işaretiyle



Bi ebsaran nezer min çû ji çerxê qewsê ebrûyan
Şukurxwaz în ku çehvan karî ber ‘eynê besaret kir

Ji ber dêmê nîqab avêt û destûra tewafê da
Di se‘yê besti bû îhram min Eswed ziyaret kir

Li dîdarê hezaran can nîsara meqdema yar în
Kesê canan bi can bikrî di ‘işqê wî ticaret kir

Bi dunyaya denî zinhar yarê xwe tu nefroşî
Kesê Yûsuf firotî wî di ‘alem da xesaret kir

Tinê ew secdeya şukrê dibet mihrabê qewseynan
Ku delq û şeml û seccade bi vê avê qesaret kir

Di behsê le‘lîleb her xam narit teb‘ê elmasî
Welê te’sîrê feyzê mihr û tedbîrê heraret kir

Di î‘cazê beyanê da suxen, ger bête însafê
Dizanit muxteser herkes **Melê** sihr û ‘îbaret kir

## 35

Min ji xeman bi sed bela dil li **Melê** hewale kir
Her çi li min kirî **Mela** camê meya du sale kir

Gok û kubar meşşiha misk û zubadê weşşiha
Bo me dibin beyan nihan hêj li min delale kir

Çîçek û gul sehergehan nesterînên di xergehan
Têkî ji misk û mawerê taze xunav û jale kir

Dêmê di bisk û xemriyan ta û lefên di şetriyan
Mane temamî kesk û sor bedr e li dorê hale kir

Dûri kirîn ji sunbulan çîçek û bişko û gulan
Dil me ji rengê bulbulan daxê şubhetê lale kir

Pîrê muxan ji şîşeyê da me sefîneyek meyê
Şukrê Xudê ku qulzemek min ji xwe ra qebale kir

Xizrê bi remz û mu‘cizî mestî meya di dil gizî
Hat û peyaleyek di dest eşkere sed peyale kir

Xunçeleba ji renggulê dêmê bi sir nima **Melê**
Şubhetê bulbulan seher lew me fixan û nale kir



Gözlerimde fer kalmadı hiç, kaşlarını oynatmasıyla
Şükür Allah'a ki, gözümü alıp basiret ihsan etti bana

Yüzündeki nikabı atarak tavafına izin verince sevgili
Sa'yedip ihram içindeyken ziyaret ettim Hacerü'l-esvedi

Binlerce can feda olur yoluna, yâr çıkıp geldiğinde
Cananı canları karşılığında alanlar kârlıdır aşk ticaretinde

Sakın satma yârini bu bu değersiz dünyalık için
Çünkü büyük bir zarar içredir Yusuf'u satanlar hiç şüphesiz

Sadece şükür secdesine varır kaşların mihrabında
Hırkayı, giysiyi ve seccadeyi yıkayıp temizler gözyaşıyla

Lal dudaklardan bahsetmek, ham olanı dönüştürmez elmasa
Muhabbet güneşinin feyzi ancak hararet temin eder ona

İ'caz-ı beyan bahsinde söz insafa gelse eğer
Anlar herkes kısaca **Mela**'nın söze nasıl bir sihir kattığını

## 35

Gamların elinden yüzlerce belayı **Mela**'nın gönlüne havale ettim
Başıma ne geldiyse ey **Mela**, iki yıllık câm-ı meyden geldi

O latif endamıyla misk kokular saçarak işveyle yürümekte
Beyan oldu bize sırları, cilve yapıp nazlanmakta yine de

Büyük meydanların yaban gülleriyle, seherde açan çiçekleri
Hep birlikte gülsuyundan çiğ taneleri serpmekte ay yüzüne

Şarap rengi, misk kokulu kâkülleri, başındaki rengârenk süsleri
Yeşil-kırmızı eleğimsağma renkler, halelenmiş mehrû etrafında

Uzaklaştırdı bizi sümbül, çiçek, gonca ve güllerinden
Dağladı gönlümüzü, lale nasıl dağlarsa bülbülleri

Büyükçe bir kadeh sundu bize mey şişesinden pîr-i mugan
Şükür Allah'a ki, içmek için götürü aldım ol denizi

Sarhoş bulduk mucizeler sahibi Hızır'ı deniz ortasında
Yüz şarap kadehi çıkarıp gösterdi bize elindeki bir kadehten

O gonca ağızlı sevgili, gösterdi **Mela**'ya gül yanaklı güzel yüzünü
Ondandır bülbüller gibi seherlerde inleyip figan ettiğimiz



## 36

Xelqo li min ken şîretê ew dilbera zerrînkemer
Min dî di halê xefletê ha[te] der ji burcê wek qemer

Ha[te] der ji burc û penceran dil girt û da ber xenceran
Evreng e halê dilberan lew ‘aşiqan xwûn bû ceger

Qelb û ceger min bûne xwîn lewra ji nû derbû birîn
Ey can were halim bibîn da rûh ji qalib bête der

Canê min î bê ser cesed mizgîn bi afaqan resed
‘Alem hemî dê ben hesed insan û cinn û canewer

‘Alem hemî têkbûne sef seyrîn bi şahê min bi xef
Hatin temaşa çar teref şatir xumar tayên di ber

Hat padişahê pursipah qametelîf dêm şubhê mah
Dad û meded sed ah û ah zulf û ‘eqarib bêne ser

Kuştîme xelqo ‘eqrebê mest im ji şewqa xebxebê
Ti tali‘ê min e kewkebê îro ‘eqarib bête der

Îro ‘eqarib hate xwar çû nêv baxê gul‘izar
Ew buxçeya her lê bihar her bulbulan lê qal û şer

Bêhed ji dil nalî ke‘îb da bexçeya ridwanê [x]eyb
Van naliyan nînin çu ‘eyb sotîne em dil bû seqer

Sotin li min cerg û hinav werdên di hûr girtî xunav
Zulf hate ser lê bû belav bayê nesîm weqtê seher

Tirsim muxalif ba detê zulfêt li dora cebhetê
Raket qiyam wê sa‘etê ‘alem bibit zêr û zeber

Zahir dibêjim pendigîr da dil nedî zulfa herîr
Şubhit **Melê** d’mînî esîr guhdêre qewlê mu‘teber

## 37

‘Aşiq er carek ji bala lê bedit berqa mecaz
Dê li nik sahibdilan hetta ebed bit serfiraz

Keşfê esrara sifatan bêmehebbet nabitin
Sûretê esma divêtin da biken jê fehim raz

Lami‘a husn û cemalê dê ji ‘ilmê bête ‘eyn
‘Işq da jê hilbitin kî dî heqîqet bêmecaz



## 36

Ey insanlar öğüt verin bana, o altın kemerli dilberi
Gördüm gaflet anında, burcundan çıktı bir ay gibi

Çıktı burcundan ve pencereden, alıp yüreğimi sapladı hançerleri
Sevgililer hep böyle yapar, ondandır kanadığı âşıkların ciğerleri

Kana bulandı kalbim ve ciğerim, deşildi yaralarım yeniden
Gel de gör hâlimi ey can, ki ruh çıkmış olsun kalıbından

Cesedimin üstüne gelirse diriltir beni ve müjde ulaşır her yere
O anda kıskanır beni insanlar, cinler ve tüm canlılar

Dizilip saf tutmuş cümle âlem, görsün diye gizlice sevgilimi
Mahmur zülüfleri görmeye gelmiş dört bir yandan herkes

Sayısız askerleriyle, elif boylu, o ay yüzlü padişah geldi
Eyvah, yüzlerce ah u vah, akrep kâküller düşerse yüzüne

Öldürmüş beni o akrep ey insanlar, mestim o gerdanın ışıltısıyla
Talihim yok yıldızlar arasında, akrepler çıkacak bugün ortaya

Sarkmış akrep zülüfler, gül bahçesine inmiş bugün
Her dem bahar olan o bahçede ondandır bülbüllerin didişmeleri

Sınırsız kalb inleyişlerimiz var rıdvanülgayb bahçesinde
Ayıp değil bu iniltilerimiz, yakmış bizi aşk ateşi kor olmuş gönül

Üstüne çiğ düşmüş zarif güller, yakıp pareledi ciğerimi, içimi
Seherde esince bâd-ı sabâ, dağıttı üstüne düşen zülüfleri

Korkarım ters bir rüzgâr eser, dağılır alnına dökülen zülüfler
İşte kıyamet o an kopar, âlem olur zir ü zeber

Açık söylüyorum tut bu öğüdümü, kaptırma gönlü ipek zülüflere
Kulak ver bu değerli nasihata, yoksa esir kalırsın tıpkı **Mela** gibi

## 37

Mecazi aşkın şimşeğiyle vurulsa âşık yukarıdan bir kez eğer
Başı dik olur gönül ehli yanında ebede kadar

Aşk olmadan mümkün değil sıfatların sırlarını keşfetmek
Sırlarını anlayıp açmak için sûret-i esma gerek

Hüsn ü cemalin parıltısı ilimle ayan olup ancak onunla,
Alevlenir aşk ateşi ve mecaz olmadan anlaşılmaz hakikatın manası



Husn û hub bê yekdu nabin dê biken şah û geda
Nûri nadet şu'leya Mehmûdî bê şem'a Eyaz

Me'neya 'işqê nizanî, ayeta husnê bixwûn
Da tu herfên muhbetê yek yek ji hev kî îmtiyaz

'Aşiqan bêgav lew kalîn ji dil tên şubhet re'd
Wan ji bala lê dibarin wek burûsk û remz û naz

Kî xeberdar e ji 'işqê kî li ber westaye ew
Ger çi reh ew zerreyek bit sînesoz e cangudaz

Aferîn sed aferîn her min ji wan ra aferîn
Ê ji tîrên dilberan daîm li dil peykan û gaz

Guh de awazê neyê weqtê sema tên muxbeçe
Fehmê razê ger dikey çawa dinalin çeng û saz

Ew dilê min wek keboter nabitin kes lewme ket
Lew di vê torê me da keftî dê bibin sed şahibaz

Wer dilo da çîn temaşaya cuwananê çimen
Wê hilanî ser bi naz û sayeyan dayî niyaz

Zulf û sunbul muşkîboy û bisk û sosin surşirîn
Serwîbala sebzepoş û gulnîşan û xunçebaz

Nêrgizên qametzumerred sergiran hatî xiram
Çari etrafan bi ref ref lê bi meş tên sî û qaz

Dil bi kê dim ez ji wan her yek bi xencan dil diben
Dilrubayên canfezayên dînber in 'aşiqnewaz

'Eqdê îhramê dema dilber xuya bî ferzî'eyn
Secdeyek ber wan du birhan nagirit cih sed nimaz

'Îd e û mîrê me îro dergehê lutfê vekir
Go **Mela** hindî bixwazî dê bidem bes tu bixwaz

## 38

Ji re'na nêrgizên te'y mest û xwûnrîz
Zeman bû 'ehdê cengengîzê Cengîz

Te canê min divêt ey canê 'alem
Ji min bistîn bi le'lên xwe'y şekerrîz



Şah ve geda gibidir, güzellik ile aşk ayrılmaz birbirinden
Işık vermez Mahmud'un şulesi, mumu olmazsa Ayaz'ın

Aşkın manasını bilmiyorsan eğer, oku güzellik ayetini
Tâ birbirinden ayırdedebilesin muhabbetin harflerini

Gök gürültüsü gibi iniltiler duyulur gönlünde âşıkların
Remizlerle nazlar yağar üstlerine şimşekler gibi onların

Aşk yolu bir zerrecik olup gönlü yakıp ruhu eritse de
Aşktan haberdar olanlar ne zaman ondan yoruldu ki

Aferin benden, yüzlerce aferin ol kimselere ki,
Dilberlerin ok ve peykan yarasını hep taşırlar gönüllerinde

Kulak ver sen neyin sesine semâ' için kalkınca muğbeçeler
Anlamak istersen çeng ile sazın çıkardığı iniltinin sırrını eğer

Bir güvercindir gönlüm, kınamak caiz olmaz onu
Çokça gördük bu tuzağa çar naçar düşen yüzlerce şahini

Gel ey gönül, seyrine gidelim çemendeki güzellerin
Cilve ile kaldırmışlar başlarını, kâküller sayeban olmuş yüzlerine

Misk kokuludur zülüflerle sümbülleri, cazibelidir kâkülleri
Servi boylu, yeşil kaftanlı, gonca ağızlı, gül kırmızısı benleri

Salınarak gezerken zümrüt gibi ağır başlı, nergis endamlı sevgili
Eşlik etmede ona dört bir yandan ördeklerle kazları

Kime gönül versem bilmem ki, bin nazla gönül almakta her biri
Gönülçelen, cana can katan, âşıkları naz ile dinden eden dilberler

Namaz için tekbir almak farz-ı ayn olur görününce sevgili
Yüz namaz tutmaz, kaşları arasına edilen bir secdenin yerini

Bayram diye bugün açtı bize lütuf kapısını mirimiz
"Ne dilersen vereceğim Mela, yeter ki sen iste" dedi şüphesiz

## 38

Kan dökücü nergis-misal sarhoş ve güzel gözlerinden ötürü
Savaşın kızıştığı Cengiz dönemine geri döndü zaman sanki

Ey âlemin ruhu olan canan, almak istersen
Şeker saçan al dudaklarla al canımı benden



Du ‘enberbo li şimşadê di mest in
Di vebestin lew hewa bû ‘enber’amîz

Ji axa asitanê mistekî bîn
Li daxan da bibînim xweş sebatîz

Tinê Ferhad dizanî lezzeta ‘işqê
Ku wî can daye Şîrînê [ne] Perwîz

Teb û tabê hezar îşkence da dil
Ji Şîrazê negahî mestê Tebrîz

Îlahî nêrgiza me’y mest û nazik
Ji destê xwar [û] bedxwahan biparîz

Ku lê têt ew qebayê asîmanî
Letîfa şeng û nazik wek belazîz

Sewaşek rêhti dîsa ‘alema dil
Bi cadûyê du çeşmê fitneengîz

Xebaisteb‘ e z’ehlê segsirişt e
Yeqîn ew ker ji canan lew dikit bîz

**Mela** canê te çawan pehlewan kir[18]
Li tayê xemriyan zulfa dil’awîz

## 39

Tu dizanî bi Xudê min tu xiyal î şe[b] û roz
Di xiyala xwe medam min tu li bal î şeb û roz

Her bi mîzan direşînin cegerê, tîr [û] xedeng
Ji neseq sa‘îqe me j’qewsê hilalî şeb û roz

Mislê goyînê rewan nale ji dil tên miskîn
Em nizanîn tu çira her we dinalî şeb û roz

Te ji firyad û fixanan bi xwe bulbul kerr kir
Ellah Ellah ji çi derdî we dikalî şeb û roz

Da ku dilber qedemê lê binihit rewşen ket
Lew tu xwûnê we ji çavan vedimalî şeb û roz

18 Piştî vê beytê du beytên dî hene ku di vê destnivîsê de nehatî.



Amber kokulu iki örük salınmış endamına mestane
Onun için sardı büründü her taraf ambere

Sevgilinin eşiğinden bir avuç toprak getir tez elden ey bâd-ı sabâ
Ta ki sarayım dağlanmış yaraları, şifa bulsun onunla

Aşkın lezzetini sadece Ferhat bilir
Odur çünkü Şirin uğruna cân veren, Perviz değil

Binlerce işkence verdi gönle humma ile aşk ateşi
Çekmedi Şems-i Tebrizî, Şirazlı sevgilisinden bunu

İlahi, nergis gibi nazik boylu sarhoş sevgilimizi
Kötü vicdanlılarla müfsitlerin elinden sen koru

Yakışmış ona o gök mavisi rengindeki kaftanı
Belaziz çiçeği gibi latif, güzel ve nazik sevgili

Gönül âlemini kana bulayan savaşı başlattı yine
Her bakışında fitne koparan o sihirli gözleriyle

Habis tabiatlı ve köpek huylu olduğundan
Yüz çevirir sevgiliden o eşek, eminim bundan

Ruhunu nasıl da pehlivan kıldın ey **Mela**
Oynamakta şimdi gönle bağlı kâküllerin tellerinde

## 39

Bilirsin ey sevgili! Billahi hayalimdesin gece gündüz
Fikrimde hayalimde her dem yanımdasın gece gündüz

Biteviye oklar yağdırmadasın ciğerimize her an
Tıpkı yıldırımlar gibi hilal kaşlarından gece gündüz

Goyin kuşu gibi iniltiler gelmekte hep zavallı gönlünden
Bilmeyiz neden inlersin böyle durmadan gece gündüz

Feryat figanınla bülbülü bile sağır ettin
Hangi dertten ağlayıp inlersin böyle gece gündüz

Ayağını gözlerime koyup nurlandırsın diye onları sevgili
Yaş yerine kan saçmaktasın gözlerinden gece gündüz



Ne tinê zewq û sefa kir bi seyên dilberê ra
Sernixwûn geh şibi “nûn” geh weku “dal” î şeb û roz

Fetweya pîr û **Mela** yan tu bi îlhamê Nebî
Vê meyê her we dinoşî bi helalî şeb û roz

## 40

Tûr im bi dil û peyr[ewê] Mûsa yim ez
Ateşperesê nûrê tecella yim ez

Herfên reqemê lewhê wucûda me bixwan
Da qenc bibînî ku çi **Mella** yim ez

Barî ji we ‘ellemê ku xeberdar kirîn
Îro tu bizan Ademê esma yim ez

Zahir tu perîşaniyê zatê me mebîn
Mecmû‘ê di zatê xwe û tuxra yim ez

Înşayê ‘ulûman li dinê ger tu nizanî
Zanî bi heqîqet ku çi îmla yim ez

‘Alem çi ye î‘rab û hurûf û kelîmat
Ew lefze di nefsa xwe û me‘na yim ez

Herçî te divêtin ji me wer can bi xwe re be
Bes tu bike ferwar vewestayim ez

Sed şîşi di dil da ne ji mihra te Melê
Daîm bi fixan mislê ney û nay im ez

Sed Nîl û Firat tên û [di]diren qelbê me
Pê nahesihim [qulzem û] derya yim ez

Tu ji nusxeyê tewhîdê vexwûn ayetê nefyê
Bê ayetê îsbat ku “îlla” yim ez

Sed neql [û] rîwayet di meya safî megir
Îro weku ji pîrê xwe bi fetwa yim ez

Peyweste tu her bang dikey şubhetê ney
Bê yar û mey û saz ku ez [n]ayim ez

Îro tu ku Loqmanê zeman î xanim[19]
Lutfek bi Melê ra bike sewda yim ez

19 Ev malike di gelek nusxeyan de nehatiye.



Sadece yârin kapısındaki köpeklerle zevk u safa sürmedin
Gah “nun” gibi boynu bükük, gah “dal” gibi beli kırıksın gece gündüz

Bir pirin ve mollanın fetvasıyla mı yoksa peygamber ilhamıyla mı Ey Mela!
İçmektesin bu şarabı helalinden gece gündüz

## 40

Tur dağıdır gönlüm, Musa’nın peyreviyim ben
Orada tecelli eden nurun ateşperestiyim ben

Varlık sayfamızda yazılanları iyice oku
Görürsün o zaman nasıl bir **Molla**yım ben

Bari “Ve alleme’l-esma” sırrından haberdar etti bizi
Bil ki, bugün işte o Adem-i esmayım ben

Sakın aldanma görünüşteki perişan hâlime
Aslında bir iken, dışı içine uymayan bir tuğrayım ben

Vakıf değilsen eğer bu dünyada ilimlerin inceliklerine
Zatıma bak! O an iyice anlarsın nasıl bir imlayım ben

Âlem dediğin, i‘râb, harf ve kelimelerden ibaret!
İşte o lafızda saklı mananın ta kendisiyim ben

Ey sevgili! Her ne istersen iste bizden, istersen al bu canı
Yeter ki sen emret, her türlü emrine hazırım ben

Senin aşkından yüzlerce şiş dağlamıştır kalbini **Mela**’nın!
Onun içindir daima ney gibi feryat koparmadayım ben

Yüzlerce Nil ve Fırat dökülüp akar gönlümüze
Farkında değilim yine de, çünkü bir deryayım ben

Tevhid kitabından sadece “ayet-i nefy”i okuma
Bil ki, ayet-i ispat olan “illa”yım ben

Saf şarabın tek kadehi etmez yüzlerce nakl u rivayet
Pirimden el almış bir sahib-i fetvayım bugün ben

Ney gibi sürekli çağırmadasın beni durmadan
Davetine gelmem mey, saz ve sevgili olmadan

Zamanın Lokman’ı sensin bugün Sultanım
Bir lütufta bulun **Mela**’ya ki sevdayım ben



## 41

Şahidê cilwenuma qudsiyê feyrûzelibas
Her ji rengê te nîşan dit çu **Nîşanî** tu binas

Husni bêayîneyê ‘işqê tecella nadet
‘Işqê Mehmûdî di me‘na nemekê husna Eyas

Herçî rengê te bivêtin xwe bibînî lillah
Nezerê wer bide kasê di xweş ayîneyê kas

Tu şerabê bi xerabê bi nehingan de demê
Dê kifayet bi çi rengî me biken kûze û tas

Remz û razê ney û nayê ku sema‘î ne hemî
Ji mehalati bi ‘eqlê xwe bizanî ji qiyas

Wê diket mexlete her dem bi herîfan bi cedel
Bi du caman ji xwe bin sîretê Ebyedwesiwas

Destigîrê te nebit Xizri‘înayet bi qedem
Nagihê avê heyatê bi du ‘esker Ilyas

Tu binê mahê new û destê qezayê hey hey
Ne li zer‘ê felekê belkî li ‘umrê me ye das

Turkîxwûnrîz xumarê me bi yek xemzegehê
Zuhdê çil sal li min zêr û zeber kir ji esas

Ji lebê le‘lê şekerbar li nik misrî Melê
Misriyan gezme reşandin ku kişandin elmas

## 42

Dil yek e [d]ê ‘işq yek bî ‘aşiqî yek [y]ari bes
Qible dê yek bit qulûban dilberek dildari bes

Min bi benda zulfekî dil da bi destê pîrê ‘işq
Lew di ‘işqê da ku best îhrami yek zunnari bes

Terhi werbûne di zunnar û çelîpa yek bi yek
Lê me zunnar û çelîpa-yek tinê yek cari bes

Hin ji nik dêrê ve tên qesta keniştê hin [d]ikin
Ney ji wan im ney ji van im min derê xemmari bes

Ger çi tên reqs û semayê her seher sed neyşeker
Min ji bezma surşîrînan ew şirînreftari bes



## 41

Tecelli edip göründü firuze giysiler içinde o kudsi sevgili
Seni gösteren her şeyde **Nişanî** gibi kendi nişanını tanı

Güzellik tecelli etmez gönüllere aşk aynası olmadan
Ayaz'ın güzelliğindeki iksirdir aslında Mahmud'un aşkı

Her ne şekilde görmek istersen kendini Allah aşkına
Ne güzel bir aynadır gel nazar kıl mey kasesine

Deniz arslanı timsaha kova ile şarap içirmen gerek
Çünkü kâfi gelmez bize testi ile tasta sunulan

Ney ve naydan duyulan tüm remizlerle sırları
Aklınca kıyas yapıp anlaman imkansız bunları

Aşk yollarını anlatırken mağlataya başvurur sevgili cedel ile
İki kadehte içerler şarabı aldatıcı ifrit gibi

Hızır gibi inayetle elinden tutan yoksa eğer ezelde
Ulaşmaz abıhayata İlyas, iki asker de olsa yanında

Yeni doğan Ay'a, onda işleyen kaza eline bak daim
Feleğin ekini değil, ömrümüzdür biçilen orakla

Türk gibi kan dökücü sarhoş olan sevgilimiz bir gamze ile
Temelinden bozup alt üst etti kırk yıllık zühd hayatımızı

Şeker tatlısı al dudaklarıyla sevgili sormadı hâlini **Mela**'nın
Elmas kılıçlarını çekip oklarını gönderdi o siyah gözler

## 42

Gönül birdir, aşk da bir olmalı; âşıklara bir sevgili yeter
Kıble de bir olmalı, gönüllere gönül çalan bir sevgili yeter

Bir zülfüyle esir olup pir-i aşka verdim gönlümü
Onun için aşk ihramını giyip zünnar bağlamak yeter

Zünnar ve salib adet ve tarz olmuş birer birer
Zünnarla salibten birini bağlayıp taşımam bana bir kez yeter

Kiliseden gelir bazıları, kimisi de havraya gider
Ne onlardanım ne bunlardan, bana meyhane kapısı yeter

Şeker kamışı boylu yüzlerce güzel, raksa gelse de her seher
Cazibeli güzeller meclisinden o tatlı işveli bana yeter



Weh çi walagewher in hatî libasê cism û can
Min ji wan horîsiriştan ew perîruxsari bes

Hewce sihra Samirî nînin ku zulfên reş biket
Çeşmê benda dilrubayan kakula ‘eyyari bes

Bulbulan sed gul di çav in çav li sed gul dî dikin
Min di baxê gul‘izaran yek gul û gulnari bes

Min di baxê gulfiroşan dî ‘eceb resmek xerîb
Xariteb‘an gul di dest e gulperistan xari bes

Ew cefa çû der ji hed zulma te bê hetta bi çend
Rehmekê carek nekey hey zalim ev azari bes

Xerqê deryayê gunah în teşneyê lutfa Heq în
Rehmeta Amirzîgar û şefqeyê Xeffari bes

Ehlê dunyayê seranser dijminê min bin **Mela**
Pişt min mîrê ‘ela bit Heyderê Kerrari bes

## 43

Îro Mela serapa lew têk bûme ateş
Min dî seher xeraman neyşekera şirînmeş

Ya Reb çi turfe mêw e evrenge mey dibexşit
Şi‘ra me wey perîşan nezma me wey muşewweş

Dil geşt w’ez ji dêrê naçim kenişteyê qet
Mihrab wê bi min ra wer da biçîne Laleş

Mehbûb wek stêran govend û ‘işqbazî
Digel biçîn semayê hişyar û mest û serxweş

Heywan li kû dibînit em muftiyê zeman în
Bistîn ji destê saqî cama zelale bêxeş

Wer guh de çeng û nayê, şîrîn ku tên semayê
Camê binoşe vê ra çi sade û çi zerkeş

Tali‘ ku tête furset muhlet li nik heram e
Min ‘umrê Nûh xwo nîne were saqî bi lez xweş

Neyşekkera şîrînqed me j’des[t] te mey divêtin
Da sîne pê cela dîn rewşen bikeyn dilê reş



Ne paha biçilmez cevherlerdir, varlık libasını bürünmüşler
O huri-sıfat güzeller arasında peri yanaklı olan bana yeter

Siyah zülüfler varken Samiri'nin sihrine ne hacet
Göz bağlayıp gönül çelen güzellerin kâküllerinin raksı yeter

Yüzlerce gül varken, başka yüzlercesine göz diker bülbüller
Güzeller bağından bana pembe yanaklı bir gül yeter

Garip bir manzaraya tanık oldum gül satanların bağında
Diken tabiatlı olanların elinde gül, güle meftunlara bir diken yeter

Haddini aştı cevr u cefan, söyle daha ne kadar sürecek zulmün
Bir kez olsun ey zalim merhamet etmez misin, bu azar artık yeter

Batmışız günah denizine, susamışız Hakk'ın lütfuna
Gafur ve Gaffar olanın rahmeti bize bu yolda yeter

Bütün dünya baştan başa bana düşman olsa ey **Mela**!
Haydar-ı Kerrar olan Ali gibisi varsa arkamda, bana yeter

## 43

Ey Mela! Baştan ayağa ateş kesilmişsem bugün
Seherde şeker kamışı gibi salınıp giden o sevgilidir sebep

Yâ Rab, ne turfanda bir meyvedir bu, durmadan mey verir
Şiirimizin ahengini öylece bozup nazmımızı tarumar eyler

Gönül gitmek istemez artık havra ile kiliseye
Sevgilinin mihrabı benimledir, gel istersen gidelim Lâleş'e

Yıldızlar gibi parıldamakta sevgili raks halkasında
Uyanık, mest ve sarhoş olarak beraberce katılalım semâ'a

Zamının müftüsüyüz biz, bunu hayvan olan ne bilsin
Sakinin elinden o saf şarap kadehini al kendinden geçmeden

Gel kulak ver çeng ile ney sesine semâ'a gelince tatlı güzeller
Birlikte iç onlarla, farketmez sade yahut altın olmuş kadehler

Talih çalınca bir kez kapıyı ihmal edip fırsatı kaçırmak haramdır
Nuh kadar uzun ömrüm yok, gel ey saki durma ver bana o meyden

Ey şeker kamışı gibi şirin boylu sevgili, elinden içmek isteriz meyi
Ta ki aydınlatalım kararmış gönlümüzü, parlatalım sinemizi



Camid çi ket bi husnê koran nezer lê xwar e
Xerteb'etên di ebleh çi neynik û çi terbeş

Kor e xwe nasipêrit carek bi des[t] delîlan
Ebleh çi ket tewafê nabînitin Berê Reş

Vêzar dibit ji qencan ji remz û naz û xencan
Qedrê gulan çi zanit guriş divêt kerê reş

Şoxa ku ez di bendê dil girtî kemendê
Letîf e zuhresîma ebrûhilalê mehweş

Feyza me şubhê Nîl e em Dicle û Firat în
Ger şêx e wer îmam e vê ra ye min keşakeş

Burhên ji qewsê qudret nîşane kir **Nîşanî**
Lami' ji ber dibarin çi yengiyek we perweş

Ellah li min heyat e çi şekker û ne[b]at e
Ji nû ve dê cuwan bim ger bêhn bikem gula geş

## 44

Şebê qedrê li me rewşen ke tu rûh î were xweş
Me ji nû xweş ke bi ser çavê şehîdên xwe bimeş

Ma li min key nezerek lutfê û ji dil xemze nihan
Bireşîne cegera rîşi ji qewsên xwe biweş

Seherê cumle şehîdên te bi rim avêtin
Hejimarî ne yekayek me hemî şeşsed û şeş

Nê şehîdên te bi isbatê bi xencer kuştiyî
Hey diçû xwûn ji birînan sed û heftad û du leş

Ceng hindî dikirin fêris û rimbazê 'Ereb
Tox û 'ala di Ferengî ne kemendarê Hebeş

Tu binê Rûm û 'Ecem keftine Zengî di kemîn
Hane her têt peyapey ji teref [Rûm] xweş û xweş

Da me şehzade bi destê xwe mûbarek qedehek
Ne xubarek ji xumarî û ne tundî û ne xeş

Du qedeh mey bi Nîşanî diderin rengi bi reng
Nêrgiza nazik û re'na û gula taze ye geş



Duygusuz olanlar ne yapsın güzelliği, körlerinse bakışı sakat
Eşek tabiatlı olanlar nergisle dikenli otun farkını anlamazlar

Kördür, bir kez olsun dayandırmaz iddiasını sağlam delile
Ebleh kişi tavafı ne yapsın, görmez ki Hacerü'l-Esved'i

Duygusuzlar kaçmakta güzellerden, gamzelerle cilvelerden
Dikenli ottur siyah eşeğin istediği, ne anlar güllerin kıymetinden

Beni esir alan o şuh, kemend atıp gönlüme tutsak kılmış kendine
Hilal kaşlı, ay gibi parlak, zühre yüzlü o latif sevgili

Nil gibi coşup taşmakta feyzimiz, Dicle ve Fırat'ız biz
Tartışmaya hazırız varsa itirazı şeyhlerle imamların

Kudretin yay kaşları nişan kıldı **Nişanî**'yi kendine
Yengî kanatlı oklar yağmakta durmadan üstüne

Ne türden tatlı bir şeker ve nebattır sevgin senin Allah aşkına
Yeniden gençleşirim koklayabilsem yeni açmış o taze gülü

## 44

Çabuk gel ey ruh, nurlandır kadir gecemizi
Gözlerimize basarak gel dirilt yolunda şehid düşen bizleri

Lütfunla bir nazar eder misin, gönderir misin gamzeleri gönülden
Yaralı ciğerime oklar fırlatır mısın kirpiklerinden

Seherde mızrağınla vurup öldürdüğün şehitleri
Birer birer saydık, altı yüz altıdır hepsi

Şehit ettiklerini hançer darbeleriyle öldürdüğün aşikârken
Ki o yüz yetmiş iki cesedin yaralarından hâlâ kanlar akmaktadır

Savaşmakta Arap mızrakçıları ve yiğitleri Hind'e karşı
Yabancı bayraklar ve tuğlar taşımakta Habeşli okçular

Bak, Rum ve Acemler düşürmüş zenciyi pusuya
Peşpeşe devam etmede yardımlar Rum tarafından

Bir kadeh sundu bize mübarek eliyle o şehzade
Ne bir hile ne bir sertlik ne bir kusur var içinde

Rengârenk iki kadeh mey sundu **Nişanî**'ye
O yeni açmış gonca gül, ter u taze nergis-i rana



Xaliba ehlê zemanî me bila ademî yin
Venemayin ji kerê me'y reş û gayê te yî beş

'Arifên ehlê bisaret ji neseq merdumê çeşm
Surmepoş in di beyadî û Mela cameyê di reş

## 45

Serwa sehîqed xemmilî lew kemmilî şahane reqs
Der suhbetê kir kamilî dê bêt û ret mestane reqs

Mestane mestan noşenoş qerqef di caman hate coş
Ma dê bimînit kes bi hoş weqtê ku bên durdane reqs

Suhbet bi sazan hate saz pê mewwicî deryayê raz
Da dil ji nû bayê mecaz wê keştiyê sukkane reqs

Mehbûb bi 'eynê kewkeb in reqsa ku tê dilber weh bin
Sed can giramê min hebin bavême rê erzane reqs

Remz û kirişmeya berî 'arif fena bin jê derî
Hetta di nêva agirî ew xef nebî perwane reqs

Perwaneyê şem'a geş în zulfêt nazik raweşîn
Şewkên di dil da pê xweş în me j'pençeyên şêrane reqs

'Ala wû tayên qurmizîn eslan di ber daberizîn
Nêrgiz di gulşen tewwizîn neyşekeran nîşane reqs

Weqtê xweya bin erxewan gulçîçekên terhên cuwan
Vê ra ne bê selwa rewan 'arif bi ferqê can e reqs

Îro şekerxendê birîn destê sipîzendê birîn
Dîsa bi govendê birîn derdê **Melê** dermane reqs

## 46

Wellah ji herdu 'aleman min husnê canan e xered
Bend im ji husna dêmdurran her sun'ê Rehman e xered

Ew kafirên camesiyah hatin bi tîb û sef bi sef
Zanim bi min nîne xered wan exzê îman e xered

Îro dilê min dilberê avête ser sed pe[yk]eran
Lazim meya gulreng vexwar lewra we buryan e xered



Zamane insanları beniâdem midir acep?
Farkları yok çünkü siyah eşeğimizle senin seki öküzünden

Beyaz giysiler yahut siyah cübbeler giyinmiş olsalar da **Mela**!
Basiret ehli ariflerin keskindir göz bebekleri

## 45

Süslenince selvi boylu sevgili, tamamlandı o şahane raks
Sohbet meclisini şenlendirmek için gelip uğradı o mestane raksa

İçilir mestane mestane, köpürüp durmakta kadehlerde mey
Kalır mı hiç insanda akıl gelip katılınca o dürdaneler raksa

Sohbet müzikle girdi düzene ve dalgalandı onunla sırlar denizi
Gönle ulaştı mecazi aşkın rüzgârı, bu gemimizin dümenidir raks

Tıpkı yıldızlar gibidir sevgililer, içinde dilberlerin olduğu raksta
Yüz değerli canım da olsa, sarfı ucuz kalır bu yolda

Yârin gamze ve ilk sırlarıyla açılmaz ariflere kapılar
Pervane gibi raksedip ateşte yanmadıkça

Pervaneleriyiz o parlak mumun, salıver o nazlı zülüflerini
Hoşnutuz gönle batan dikenlerden, aslanlar pençesinde ederiz raks

Bayraklar ve kırmızı ipler altında aslanlar hücum etti bize
Gülşende nergisler açmış; şekerkamışı boyluların nişanıdır raks

Açılınca erguvanlar, gül, çiçek ve taze dallar
Onlarla birlikte salınınca serviler, ölürcesine katılır arif bu raksa

Güler yüzlü sevgili beyaz kollarında götürdü bugün bizi
Yine raks halkasına götürdü bizi, **Mela**'nın derdine devadır raks

## 46

Vallahi, her iki dünyada da hüsn-ü canandır maksadım
Hayranı olduğum ay yüzlülerin güzelliğinden, İlahî sanattır maksadım

Siyah giysiler içinde saf olup birlikte gelir o zalim güzeller
Bilirim amaçları ben değilim, gelip imanı almaktır maksatları

Yüz çeşit yolla gönlüme aşk ateşi atan sevgililer
Gül renkli saf şaraptan içince kalbimi büryan yapmaktır maksatları



Şahin bi hev ra hemnuşîn reng û rûyê yek qet nedî
Êkî te'am e her murad ê dî jî aşxwan e xered

'Eql û dilê min bir ewan mîran bi remz û 'işweyan
Wan 'eql û dil yek car [d]ivê ustadê newdane xered

Bejna reng selwasehî lew roj bi roj 'alî dibit[20]
Meyl e li ser selwan kevit wan seyr asiman e xered

Îlan li tayê 'er'erê lew rast û çep fetlan didit
Wê xwe [d]ixapînit li min lê qelbê pur jar e xered

Tîra avêtî dil şewand derbûn ji çavan avê xwûn
Dilber bixwe zanî û got, zanim te tofan e xered

Min go gelo dilber, reqîb feyde ji te qet wî heye
Sond xwar bi husna xwe dê wî fi'lê şeytan e xered

Zulfên ji reng davên helek şehper ji serçengên Huma
Êkî dilê min naretê ya dî ji canan e xered

Ew 'eqrebên bo'enberîn bê ruh husna mest û ter
Lew tên bi dêmê da bi lez wan ser nîşan e xered

Xalên mudewwer fulfulîn madde ji bisk û 'enber e
Lew zulf têkda tên mest, bêhn û boya wan e xered

Dil girt bi dava sunbulîn berda û dîsan girteve
Mîran jixwe her daîma girtin û berdan e xered

Misrî ji kalanê keşand cellad "rê" û "mîm" **Mela**
Ger tu nizanî qenc bizan wan ev ji dewran e xered

## 47

Şêweyê dilberê bizan sunnet e şêwe 'işwe ferz
Herdu nezer ku bûn qeran wacib e yek kirişme ferz

Herdu qeran ku qible yin perde du'a ji ber biret
Wê se'etê dideyne 'işq lazim e yek-du secde ferz

Xirqeyê zerq û rengê zuhd min b'meyê muxane şuşt
Şuşt û şoyek di meykedê ewwel kar ferz e ferz

20 Di vê xezelê de ev çar beyt (6,7,8 û 10) di nusxeyên dî de nehatine.



Neşe içinde oturmuşuz güzellerle, görmediler birbirinin yüzünü
Birinin yemektir muradı bir diğerinin derdi mutfaktır

Remizleri ve işveleriyle aklımı alıp gönlümü çeldi dilberler
Bir kerede isterler aklımı ve gönlümü; alışveriştir çünkü gayeleri

Boy bosu yükselmede gün be gün ol sevli boylunun
Selvileri aşıp asumanda seyre dalmaktır amacı

Ardıç ağacı buğumlarına sarılmış yılanlar sağlı sollu kıvrılıp gitmede
Kandırıyor beni kendisiyle aslında kalbi sızlatmaktır amacı

Yaktı gönlü aşk okları döküldü kanlı gözyaşları
Dilber kendi bilip söyledi; bilirim tufandır maksadın

Dedim: Ey gönülçelen güzel, rakibin fitnesinden kaçış var mı?
Dedi: Güzelliğime andolsun ki, aramızı açmaktır şeytanın amacı

Halka halka tuzak zülüfler Hüma kuşunun kanadındaki çengeller gibi
Birinin derdi gönlümdeki ateşi yakmak, birinin canandır maksadı

Reyhan, menekşe ve amber kokulu sünbüller dökülmekte
Yüzündeki benlere ulaşmak isteğiyle.

Gül suyu serp zülüflerinden siyah benler üstüne
Mest olmuş zülüfler gelsin benlerin kokusuna ulaşmak için

Sümbüllerin tuzağına alıp bıraktı gönlü, sonra hapsetti yeniden
Padişahtır, hapsedip bırakmaktır padişahların işleri çünkü.

Parçaladı gönlü bu işveler, kanla nakışlandı kalbe saplanan oklar
Ey sevgili, kurban olarak almaktır **Mela**'nın canını maksadın

## 47

Bil ki, sevgilinin nazı sünnet, işvesi farz olur
Karşılaşınca iki bakış, gamze ile göz kırpması farz olur

Birbirine yakın kaşlar kıble olup göründüklerinde her defasında
O an aşk dininde âşığın bir iki secdeye varması farz olur

Riya hırkasıyla zühd kirini meyhanenin şarabıyla yıkadım
Meyhanede bir kez yıkanmak evvel emirde farz olur



Neyşekerên şirînzeban mestê ji cama û bade yîn
Ferz dibit ji tewbeyê salikê ‘işqê tewbe ferz

Saqiyê sîmê saqê ma jehrê helahilî bidet
Canê me şukr û minnetê tîz-rewan reqs e ferz

Xal eger bi wechekî bête qeranê ebruwan
Şubhetê Beytê Meqdes Ke‘be dibit du qible ferz

De‘weyê ‘işq raza ger kifş biket zeban derd
Ketmê şehadetê dibit wê se‘etê li şehde ferz

Cebhet û dêm û gerdenê perde dema ji berbiret
Ferz e **Mela** li haciyan se‘y û tewaf û ‘umre ferz

## 48

Me ji bil husn û cemalê çi xered
Bê cemalê ji peyalê çi xered

Ger ne teşbîhê du burhên te buwan
Me di ‘îdan bi hilalê çi xered

Ger ne qesta dil û canê me diket
Me ji wê şox û şepalê çi xered

Ger ne rûha me di pê dil biretin
Me ji wê qenc û delalê çi xered

Ne bi ismê te mu‘emma bin herf
Me bi şikl û xet û xalê çi xered

Qestê wehdet dikirit rûhi bi rûh
Wer ne ‘aşiq ji wîsalê çi xered

Ne ku şermende ji rûyê te buwa
Afitabê bi zewalê çi xered

Di şebê qedrê tecella tu bikî
Me bi yelmûmê şemalê çi xered

Ne tecellaya cemala te bûwa
Me ji xûban bi cemalê çi xered

Ne ji le‘lên te **Mela** behs diket
Me ji vê behs û sualê çi xered



İnce boylu, tatlı dilli güzeller hazır olunca mecliste mey dolu kadehlerle
İçmemek üzre yaptığı tövbesinden dönmesi salik-i aşka farz olur

Gümüş tenli sakimiz elinde öldürücü zehri bize sunarsa
Teşekkür ifadesi için ruhumuzun o raksa varması farz olur

Yanağındaki benler kaşlarına yaklaşsa eğer bir şekilde
Beytü'l-Makdis'le Kâbe'ye benzer, o iki kıble bize farz olur

Ne beladır! Aşk davasındaki sırlarımızı ifşa ederse dilimiz!
Şahitliği ketmeden için şehadet getirmek farz olur

Sevgilinin yüzünden ve gerdanından perde kalktığında
Ey **Mela**! Sa'y, tavaf ve umre, hacılara farz olur

## 48

Hüsn ü cemalden gayrı bir isteğe ne hacet
Övülecek bir güzellik yoksa piyaleye ne hacet

Her iki kaşına benzemezse eğer senin
İki bayram hilalini gözetmeye ne hacet

Gönlümüze ve ruhumuza yoksa kastı
O şuh ve güzeller güzeline ne hacet

Ruhumuzu gönlümüz peşi sıra sürüklemese eğer
O güzel ve latif sevgilinin ardından gitmeye ne hacet

Harfler senin isminle muammaya dönmezse
Yüzündeki benlerle hatlara ne hacet

Ruhlar birbiriyle birleşmek ister her an
Yoksa aşığın vuslat arzusuna ne hacet

Seni görünce nurundan utanmasaydı
Güneş'in batıp kaybolmasına ne hacet

Kadir gecesinde sen tecelli edersen eğer
Mum ve lamba ışığını aramaya ne hacet

Senin güzelliğinin tecellisi olmasaydı
Güzellerin cemaline bakmamıza ne hacet

Lal dudaklarından bahsetmiyorsan **Mela**
Bu bahislerle suallere artık ne hacet



## 49

Dîsan li bedrê katibî kêşa ji nû jengarê xet
Nûrin reşandî Wahibî der girdişê perkarê xet

Herfên ji qudret nu[q]te pur madarê hewza le'l û dur
Evrenge kê wî dî bi ser qudretnumûn zengarê xet

Ew çîçekên şetrî-şibêht ef'a-sifet qelbê me mêht
Selwa ji balayê we rêht ev perdeya gulnarê xet

Neqş û nigarê dilberan dercên ji remzên esmeran
Her tên bi dest neyşekeran me j'gulşenê purxarê xet

Me j'des[t]xeta terhên şepal xal û xetên nûra zelal
Danî bi sendoqan li bal marê me sed qentarê xet

Belgên gul û reyhaniyê katib numûçek daniyê
Kes dî bi vê şîraniyê durra sifetê Cebbarê xet

Reyhan û sunbul tê hene sed çîçek û gul tê hene
Avazê bulbul tê hene ev bexçeyê gulzarê xet

Madarê dêm û cebhetê haşa li dora ayetê
Lê rast û çep bû wesletê cedwelkeşê zunnarê xet

Îro seher tuxra nîşan î'rab û herfên durefşan
Hatin digel bayê seba me j'canibê dildarê xet

Ellah di ber qalûbela da yexme ket qelbê **Melê**
Avête çerxê cedwelê evrenge 'enberbarê xet

Îro berata **Ehmedî** tuxranîşan zerkeş me dî
Xettê humayûn kes nedî şîrîni me'nadarê xet

## 50

Xwûn ku ji dil bi mewci têt eşkê rewan me tên bi şet
Nîl ji dîdeyan dizêt keftime nav şebihê bet

Katib di neqşê qudretê zêr reşande ser xeti
Erzen û dêm û cebhetê lê neqişand û kir nuqet

Cebhet û dêm neqqişand misk û zubad lê reşand
Nûrê ji zulmetê reşand taze kişand xet bi xet



## 49

Yeniden yeşil hatlar çekmiş ay yüzüne yine kâtip
Üzerinde pergel gezdirip nur serpmiş üstüne Vahib

İnci gibi benler var kudret harflerinden, lal dudaklar etrafında
Kim görmüş böyle güzel bir rengi; kudreti gösteren yeşil hattı

O şatri-misal takılar ısırıp emdi kalbimizin kanını yılanlar gibi
Gönderdi selvi boylu yukardan nar çiçeği basmalı bu giysiyi

Dilberlerin nakış ve resimleri, esmer güzellerin remizleriyle dolu
Şeker kamışı güzellerin eliyle gelir dikenlerle dolu gülşeninden

Yârin narin eliyle yazılmış, safi nurdan hatlarla benleriyle süslü
Yüzlerce kantar mektuplarını koyduk sandıkdaki yâr zülfünün yanına

Küçük bir numune kıldı kâtip reyhan ve güllerin yapraklarını
Kim görmüş Cabbar'ın inciye benzeyen bu çok tatlı hattını

Reyhan ve sümbül vardır, yüzlerce çeşit çiçekle gül vardır
Bu hattın gülzar bahçesinde bülbüllerin nağmeleri vardır

Yüzünün etrafındaki nakışlar ayetlerin etrafındaki haşiyelerdir sanki
Vuslata ermiş sağlı sollu cetvelle çizilmiş zünnardan hatlar

Ulaştı bize bugün seher vaktinde bâd-ı sabâ ile ol sevgiliden
İ'rab ve harflerinin her biri bir inci gibi, tuğra nişanlı mektubu

"Kalubelâ"dan önce Allah yağmalamak için **Mela**'nın gönlünü
Böyle takdir etmiş kader cetvelinde amber saçan hattın rengini

Gördük bugün altından yapılmış tuğralı beratını **Şeyh Ahmed**'in
Kimse görmedi el-hak böyle tatlı, manalı sultani mühürlü mektubu

## 50

Gönülden dalga dalga kan akınca gözyaşlarım ırmak olup taşar
Kaynağını gözlerden alır, bir ördek gibi içine düştüğüm Nil

Nakş-ı kudretin kâtibi altın saçmış yanaktaki ayva tüylere
Nakş edip noktalamış onunla alın, yüz ve çeneyi

Nakışlamış yüz ile alnı, misk ve zebad serpmiş üzerinne
Nur saçmış karanlığın içinden, yeni çekmiş bir bir hatları



Hûr û ferişte kes we dîn nazik û xûb û surşîrîn
Nîm numûne pir biçîn sûretê Çîn numa xelet

Şi'rê **Melê** ku wek rewan ah ji can me tên rewan
Pur me li bergê erxewan dîne xezel li nik şetet

## 51

Mey nenoşî Şêxê Sen'anê xelet
Ew neçû nêv Ermenistanê xelet

Mislê Mûsa wî tecellaya te dî
Ê tu dî kanî xeta hanê xelet

Wî nedî bejna te û danî qiyas
Hikmetê lew çûne burhanê xelet

Setweta Leylê yeqîn Mecnûn teband
Wer ne da naket beyabanê xelet

Wek **Nîşanî** neqş û nîşanek te dî
Ê ku nîşanek te dî kanê xelet

Ez giham ava heyatê xef ji dil
Xizir vajî çûye heywanê xelet

Şahneşîna nazikan zayi' meke
Da nebînî dil bi vê xanê xelet

Ellah Ellah çerx û dolabê binê
Nuqteyê naket di dewranê xelet

Roj û şev her seyrê dîdara te tên
Nagerin ew seyranê dewranê xelet

Hûn bibîn meşşateyî xef danî
Hemqiran key xal û nîşanê xelet

Pê li ser canê me murwet daye şêx
Bişkuwên benda girêbanê xelet

Ser nebî ber kufrîzulfê 'aqîbet
Ez ditirsim bê ji îmanê xelet

Pehniya vê çerx û dolaba dinê
Nîne tê der babê 'urfanê xelet



Kim görmüş böyle bir huri meleği, böyle lâtif ve güzeli
Yarı aralanıp görünen yüzünün yanında sönük kalır Mani'nin tablosu

Gönülden aralıksız gelen "âh"lar misali **Mela**'nın şiiri de akar gelir
Erguvan yaprağına yazılmış çok şiir gördük nehir kıyılarında

## 51

San'an şeyhi mey içmedi yanlışlıkla
Ermenistan içlerine gitmedi yanlışlıkla

Tıpkı Musa gibi tecellini gördü senin
Gördüyse seni gören, nerde hata nerde yanlışlık

Görmediği hâlde kıyas yoluyla anlamaya çalışan seni
Kaybetti asıl hikmeti gösterdi kanıtı yanlışlıkla

Leyla'nın aşk gücüdür helak eden Mecnun'u
Yoksa hiç düşer miydi çöllere yanlışlıkla

Suretle nişanını gördü tıpkı **Nişanî** gibi
Nişanını görenin ne işi olur yanlışlıkla

Hakikatte ulaştım abıhayata gizlice
Hızır ise ters yöne gitti yanlışlıkla

Güzellerin oturduğu sarayları kaybetme
Ta ki bu dünyada başkasına düşmesin gönül yanlışlıkla

Allahım, ne harikadır bu dönüp duran çark
Ekseninden bir nokta şaşmıyor yanlışlıkla

Gece gündüz seyrine gelir daim didarının
Bu seyr ü deveranı yapmazlar yanlışlıkla

Demeyin meşşatenin, sevgiliyi bir gelin gibi süslediğini gizlice
Benlerle nişanları bir arada koymamıştır yanlışlıkla

Ne mutlu bize! Sevgili ayağı ile basarsa gönlümüze
Bağlamış yakasındaki düğmeleri yanlışlıkla

Başın eğmezsen, sevgilinin siyah zülüflerine
Akıbet, korkarım yitip gitmesinden imanın yanlışlıkla

Bu sonsuz feza, bu dönüp duran evren çarkı
Bulunmaz irfan ehlinin kapısında yanlışlıkla



Nusxeya ‘alem hemî ‘inwanek e
Nuqteyek nabit di ‘unwanê xelet

Qulzum û bayên muxalif tê pur in
Da bikelşin darê sukkanê xelet

Da bizanî pehlewanî mûyek e
Dest nedî lillahî mîzanê xelet

Wê di destê min gula geş pur xunav
Heyf bulbul çû gulistanê xelet

Hê ji sehwa xame bû wer ne ku min
Ev xelet nakir di dîwanê xelet

Wê li ser bejna te ev seywan veda
Wer ne neda rojê ev seywanê xelet

Geh dil û geh can diben Turkê di te
Nagerin yexma û talanê xelet

Lê me’j Turkan Firat û Nîl kir
Teşneleb çû terfê ‘ummanê xelet

Pîrê hikmetbîn li wifqa meşreban
Kes nedî mey rêhte fincanê xelet

Rastiyek qanûn seraser nîne tê
Xwar û pîçên vê perîşanê xelet

Pak-teb‘ û quwwetek mewzûn [d]ivê
Da ji sin‘et dest bi îdmanê xelet

Merdumên çavêt **Melê** ‘eksa xwe dî
Wek **Nîşanî** ma li nîşanê xelet

## 52

Bê meya le‘l **Mela** min ji meya al çi hez
Suhbeta tê nebitin yar bi her hali çi hez

Qedehek bade bi destê xwe li qelbê me birêj
‘Aşiqê xesteyê bêateşê seyyal çi hez

Ne ku wek terg ji remzên te bibarin li peykan
Ji birînên xwe dilê şubhet xirbal çi hez



Tümüyle birdir ünvanı bu kâinat kitabının
Bulunmaz onda bir tek hata bile yanlışlıkla

Onda sayısız derya ve ters esen rüzgârlar var
Sakın kırayım deme dümeni yanlışlıkla

Şunu bil ki, sen tıpkı bir ip cambazısın
Allah aşkına, kıl kadar olsun bozma dengeyi yanlışlıkla

Çiğ taneleriyle dolu bir gül var elimde benim
Yazık ki bülbül gülistana gitmiştir yanlışlıkla

Kalem hatasıdır şimdiye dek olan tüm hatalar
Yoksa koymadım bu hataları divanıma yanlışlıkla

Endamın içindir Güneş etrafındaki nur halesi
Konmamıştır yoksa oraya o hale yanlışlıkla

Türkler, kâh gönlünü, kâh canını alırlar senden
Bu talan ve yağmayı yapmazlar yanlışlıkla

Sevgili Fırat'la Nil'i verdi Türklere içmek için
Susuzluktan kavrulansa okyanusa yöneldi yanlışlıkla

Her türlü zevkleri tadan hikmet sahibi pirin
Görmedi kimse kadehe mey döktüğünü yanlışlıkla

Bir külli kanun geçerli değil bu dünyada baştan başa
Sapmalar, eğrilikler, perişanlıklar yok yanlışlıkla

Tertemiz bir fıtrat, dengeli bir güç gerektir kuşkusuz
Ta ki aşk sanatı üretmesin yanlışı yanlışlıkla

**Mela**'nın gözbebekleri sevgilinin gözlerinde gördü aksini
**Nîşanî** gibi sevgilinin siyah benlerinde kaldı yanlışlıkla

## 52

Ey **Mela**, lal dudaklar olmadıkça kırmızı şarabın tadı olmaz
İçince sevgilinin bahsi geçmeyen hiçbir sohbetin tadı olmaz

Kalbimize dök bir kadeh badeyi kendi elinle
Ateş-i seyyal olmayınca hasta âşığın gönül tadı olmaz

Dolu gibi yağmadıkça oklar bakışlarından gönlümüze
Yaralardan bir eleğe dönmüş gönlün tadı olmaz



Hezz û lezzet me bi ‘umrê xwe di ‘işqê têtin
Hem bi van derd û xeman zêde hezar sal çi hez

Husn û sur girt û şibit cezbe li dil da mehbûb
Me ji zulf û xet û xal û qed û meyyal çi hez

‘Işq û ‘ilmê but û latan bi serek ‘alî nabit
Qederek hali nebit beyhude feryad çi hez

Bedewê pak çi ket feshetê meydan ku nebit
Mustemi‘ guh nedirin mutrib û qewwal çi hez

Durrê nasufte dirêjim ji lebê le‘lê **Melê**
Ger çi re can biderin ruhê kerê lal çi hez

## 53

Ser didet avê kewserê zemzemeyê semayê zulf
Sayenumayê xawerê sidreyê muntehayê zulf

Sayenumayê cebhetê neqş û xetê ji qudretê
Nuqte û herf û cezme tê bal û perê humayê zulf

Bal û perên sifethuma saye li cebhetê numa
Xemrî û bisk çûn sema yek bi yek li bayê zulf

Bisk û şerab û şitriyan reqs e ji rengê xemriyan
Baz û [‘îqab] û qumriyan seyr e seher tebayê zulf

Her me ji burcê sunbul e pence di sîne û dil e
Dûr û diraz û muşkil e qisse û macerayê zulf

Bestiye zulfê der kemîn helqe bi helqe çîn bi çîn
Yexma diken dilan nihîn in, nîne yeqîn xetayê zulf

Rûm û ‘Ecem ji her teref Hind û Zeng sef bi sef
Rezm û sewaş e wan bi xef hatine ber hewayê zulf

Her dem û her se‘et ji nû pêt e, di sîne nar û dû
Sebr kû têt û xew ji kû ‘aşiq û mubtelayê zulf

Zulfê siyahê bêwefa qet me nedî ji dest sefa
Kuştime ez bi sed cefa ah ji dest cefayê zulf

Zor û feqîr û mubtela zahid û sofî yû Mela
Kuştine ew bi sed bela kes nekevit belayê zulf



Ömrümüz boyunca biz haz ve lezzeti aşkta gördük
Yoksa bin yılı aşkın bunca derd u gamın tadı olmaz

Sevgilinin, gönlü titretecek bir güzelliği olmasa eğer
Cilveli endamın, zülüf ve benlerin bizim için tadı olmaz

Mağrur olmayla güzellerin aşkı ve ilmi bilinmez asla
Hâl ilminden biraz olsun nasib yoksa, feryadın tadı olmaz

Meydan geniş değilse eğer maharetli süvari ne yapsın
Dinleyen kulak vermezse, çalgıcı ile şarkıcının tadı olmaz

Lal dudaklardan işlenmemiş inciler dökmekteyim **Mela**
Canımızı yoluna saçsak da dilsiz ve sağır nazmın tadı olmaz

## 53

Ab-ı kevsere ulaşır nağme ve raks ile zülfün
Sidre-i münheta güneşinin gölgesidir zülfün

Yüzündeki gölgelikler, nakışlarıyla hatlarıdır kudretin
Noktalar, harfler ve cezimler hüma kanatlarıdır zülfün

Hüma kuşunun kanatları gibi gölge yapmış yüzüne
Peçe ve püsküller birer birer katılmış raks halkasına zülfün

Yüzündeki takılarla kâküllerin raksa gelmiş al peçeler gibi
Şahin, kartal ve kumrular seyre gelmiş seherde, cezbesiyle zülfün

Sümbül burcundan pençeler durmadan yaralamakta gönlümüzü
Çok uzun ve müşkildir kıssa ve macerası zülfün

Zülüf tuzak kurup bağlanmış, halka halka, lüle lüle
Gönülleri gizlice yaralasa da yok hatası zülfün

Her yandan Rum ve Acemlerle saf saf Hind ve Zengîler
Savaşmada her biri, gizlice kapılmış hepsi havasına zülfün

Her dem yeniden kor olur sinemiz, her an ateş ve dumanla
Nasıl dayansın uykusu nasıl gelisin âşık ve müptelası zülfün

O vefasız siyah zülüflerden hiç görmedik safa
Yüzlerce cefayla öldürmüş beni, ah elinden cefa-yı zülfün

Zengin, fakir; güçlü, zayıf; zahid, sofu ve **Mela**'yı
Yüz bela ile öldürmüş, düşmesin kimse belasına zülfün



## 54

Nazika min di semayê bi serenguştê ‘eqîq
Da me îro di serayê qedehek taze rehîq

Me ji dest yedê beyda qedehek noşî û bes
*Şe‘şe‘aniyyin ke necmin bi senahu we berîq*

Sirrê le‘lî-lebê canbexş nizanî tu bi behs
*E‘iddi’n-nezrete ya naziru fe’s-sirru deqîq*

Bi lebê le‘lê şekerxende şikêna şekerek
*Ene bi’l-we‘di le wasiq fe leha’l-we‘du wesîq*

Di riya durrê muradê me serî daniye rê
*Xiftu fî’lbehri we la zewreqe we’l-behru ‘emîq*

Min ji xeflet seherê dî û bi remzan kuştin
Xweş bi heqqê xwe gehiştim ene bi’l-qetli heqîq

Qet nego qetl e dikim bêguneh û mezlûm e
*Reşeqetnî bi nibalin we remetnî bi reşîq*

Tîr û rim herdu li dil dan û ceger çespan kir
Ew ji xwûna me ne riştî tiliyên sor î ‘eqîq

Sosinên te’y ter û nazik li gulan te‘ne diden
*Fe bihe’l-‘enberu faih we bihe’l-misku ‘ebîq*

Çi bi kuştin wer bi hiştin tu herî ferman ke
Ez bi hukmê te xweş im **Ehmed**u ‘ebdun we reqîq

## 55

Dilbera min seherê hat bi tox û bi yedek
Sed yedek çûn di berê têki bi sincab û weşek

Bi edeb çûme diyarî bi ziyaret kefê pa
*Qale ya ‘aşiqu hatîke yedî hati yedek*

Dil û can herdu me danê û îcazet ji me xwest
*Qultu estewdi‘uke’l-Bariye Ellahu me‘ek*

Te divê safî û zexel jêk vedî tecrîbe key
Da ‘iyarê bi temamî binumêtin çû mehek

Dewrê zulfa te muselsel bi nezer hel nabit
Nezera saf detê serdiderit nuqteyê şek



## 54

Raksa gelmiş narin sevgili akikten parmak uçlarıyla
Taze şaraptan bir kadeh sundu sarayında bugün bize

Yârin yed-i beyzasından bir kadeh içtik o saf şaraptan
Bir yıldız gibi parlayıp ışık saçmada aydınlığından

Anlayamazsın can bahşeden lal dudakların sırrını söz ile
Yeniden bakıp iyice düşün, çok incedir çünkü bu sır

Şeker söyleyen lal dudaklar tatlı vaatler fısıldadı yine
Güvenirim sözlerine, sadıktır, çünkü sevgi var gözlerinde

O nefis inciye ulaşmak için baş koyduk bu yola
Daldım derin bir denize ki bulunmaz hiçbir sandal

Seher vakti gördüm onu ansızın, öldürdü beni bakışlarıyla
Hak etmiştim zaten bu cezayı, ulaştı maksuduna yâr böylece

Bu günahsız mazlumu öldürüyorum demedi hiç
Fırlattı oklarını, gönderdi üstüme öldürücü bakışlarını

Vurdu kalbime okla mızrağı, pare pare etti ciğeri
Akan kanımızdır parmaklarını boyayan kırmızı renge

Gülleri itham edip küçümsemede ter u taze zambakların
Çünkü amber ve misk dağıtmada etrafa kokuları

Öldürsen de azat etsen de birdir, emr u fermanın olur
Razıyım verdiğin hükme, çünkü kulun ve kölendir **Ahmed**

## 55

Sevgili başındaki tuğuyla sultanî giysiler içinde geldi seherde
Yüzlerce giysi var üstünde; vaşak ile sincap derisinden hepsi de

Ayaklarının altını ziyaret için edep ile vardım yârin eşiğine
Dedi: Ey âşık, işte elim, tut, sen de bana ver elini

İzin isteyince yolculuk için, ruh u gönlümüzü verdik ona
Dedim: Teslim ettim seni Bâri'ye, seninle olsun Allah daima

Sahteyi gerçekten ayırdetmek istersen eğer tecrübeye başvur
Ta ki mihenk göstersin sana tam olarak bunların ayarını

Bir nazarla hâl olmazsa eğer zülüflerinin zincir muamması
Saf gönülden çıkan bakış ancak kaldırır üstündeki şüpheyi



Ahuwa min ne ku rencek te bi xatir bigehit
Bi Xwudê key tu ku ew seg bi xwedî hate mesek

Bi evînê melek û çerx û felek têne sema
Rewşen in têki bi mihrê ji sema ta bi semek

Ne ku peyweste bi yek bin ji surê ‘işqê du rûh
Ney bi eşbahi bibin wasil û peyweste bi yek

Ji musemma de xeber kesretê esma tu mebîn
Zeyd û ‘Emrên hetta çendî ku du ji min yek yek

Çi fesahet bi melahet weh didêrî tu **Mela**
Ev edaya te di şi‘rê ku şirîn bit bi nemek

## 56

Nazikek min seherê dî bi cemala xwe ne wek
Hûr û wîldan û perî dî tu beşer bû ne melek

Were carek temaşayê şehîdên di xwe key
Ehsenellahu tebarek ji du çehvên te belek

Sunbulên [t]er li gulan pali bi mestî diderin
Sosinên taze li nisrînwereqan bûne helek

Nazika min ku bi mestî di çemen hate xiram
Ji hesed çûne kusûfê meh û mihra di felek

Ê ji xeflet te bibînit kû bimînit heyhat
Te bi çavên di belek kuştine mezlûm gelek

Zerreyek ‘işqê giha kî û ji ‘eqlê xwe nebir
*Kullu men sadefehu dahîşetu’l-‘işqi helek*

Xusruwê ‘işqê ku rûniştî li ser textê wucûd
*Fetehe’l-qelbe ‘elel-fewri we li’r-rûhi melek*

Weh çi ‘işq û çi selamet çi diborin heyhat
*Kullu men yesluku hubben sebele’n-nari selek*

Ahê bêgav ji dil tên me ji pêta di ceger
Bes tu bêfeyde nesîhet ke me dil bû ye pelek

Ma ji ‘umrê me çi mabit were ey dil vi me ra
Da di eqtarê wucûdê bikirîn seyrê [m]elek



Billahi ulaşmaz gönlüne hiç bir eziyet ey ceylanım benim
Allah aşkına, her taraftan bağlanmıştır o köpek, derim

Aşk ile raks edip dönmekte tüm meleklerle çarkıfelek
Aşk nuruyla ışıldamakta kâinat semadan denizdeki balığa dek

Aşkın cezbesiyle birleşemiyorsa şayet iki ruh
Sadece cesetle birleşip kavuşmaları mümkün olur mu hiç

Müsemmalarından bahset, isimlerin çokluğundan söz etme
Bizim Zeyd'le Amr'ımız ve daha niceleri, iki değil birdir aslında

Ne tatlı bir fesahattır bu, malik olduğun ey **Mela**!
Ne zevkli ve şirin bir uslubun var senin şiir ile nazmında

## 56

Bir nazenin gördüm ki seher vaktinde, benzemez güzelliğiyle;
Ne huriye, ne vildana, ne periye, ne beşere ve ne de bir meleğe

Gel de yolunda seyret bir kez, hâllerini gör
Tebarekâllah, o iki siyah gözlerinin şehid ettiklerine

Taze sümbüller mest olup dayanmış kızıl güllere
Yeni açmış zambak yaprakları dolanmış beyaz güllere

Salına salına çıkıp gelince nazlı sevgili çemenden
Tutuldu semada Ay ile Güneş hasedinden

Heyhat, nasıl dayanabilir ki ansızın gören seni
O iri siyah gözlerinle öldürmüşsün pek çok mazlumu

Aşkın bir zerresine hedef olup da aklını yitirmemiş kim var ki
Sonunda helak olmuştur aşk belasına tutulan her bir kişi

Aşk sultanı oturunca bir kez varlık tahtına
Açılır hemen kalbe tüm kapılar, hâkim olur ruh her şeye

Aşk ve selamet... Nasıl da geçip gider bizden bu ikisi
Ateşten bir yola koyulmuştur aslında aşk yolunu seçen her kişi

Aşk oduyla yanmış ciğerle gönülden her an ahlar yükselmede
Yeter nasihat ettiğin boş yere, gönül dönüşmüşken kor ateşe

Geriye ne kaldıysa ömrümüzden gel artık bizle ol ey sevgili
Ta ki seyredelim âlemin her tarafını melekler gibi



Di îstîwayê ku ji husna te veda lami‘ekê
*Nezeru’ş-şemsi mine’ş-şerqi ile’l-xerbi [d]elek*

Afitaba ku ne teswîrê ji husna te bitin
*Nûruha fî nezerî zulmetu dacin we zelek*

Ji hewa bend te kirîn şubhetê bazû we sivik
Çi ji biska te bibêm ahi ji biska te çelek

Ez ji zulfa te verestim me teleb kir lebê le‘l
Lê di çaha zexenê bê ser û pa bûme helek

Bi umîda te humayî ne **Melê** tori veda
Wer temaşa ke cehan bûye hemî tor û şebek

## 57

Ger bidiya ew senema surcemîl
Nazilê ‘erdan nedibû Cibreîl

Min nezerek li husn û cemala te kir
Ayineyek dî me ji nûra Celîl

Lew ji lebê le‘lê te ca[m] bû xecil
Badeyê engûr kuca selsebîl

Dîl hezar in te di bendê welê
*Leyse lena ‘enke mecalu bedîl*

*Ma ena wehdî bike min muxremin*
*Kem leke qetlî şexefen min qebîl*

Daruwê derdê me tu yî canê me
*Hel bi siwe’l-wesli şifau’l-[‘e]lîl*

Sebr û sukûn çûni bi nêv Dicle da
Lew ji du çavan me dizên avê Nîl

Bes ku hine çeşme ji çeşman dizên
*Murhu demin dem‘u ‘uyûnî bisîl*

Pur me nezer da te ji ser ta qedem
*Qed rece‘e’t-terfu we ‘eqlî kelîl*

Mislê te ma bûne weya ma dibin
Roji tecella ye çi hacet delîl



Öğle vaktinde aydınlatınca etrafı güzelliğinin parıltısı
Sönüp kaybolur hemen doğuda ve batıda Güneş ışığı

Güzelliğini tasvir ve temsil etmeseydi Güneş
Nazarımda eşit olurdu en muzlim gecenin karanlığına

Hızlı esen bir rüzgâr gibi bağladın bizi aşkına
Ne desem zülfünü tasvir için, ah elinden alna düşmüş kâkülün

Sıyrılıp zülfünden düşüp talip oldum bu kez al dudaklara
Lakin başsız ayaksız düşüp helak oldum çene çukurunda

Ey hüma kuşu, seni avlamak için tuzak kuran **Mela** değil sadece
Gel de seyran et, gör tüm âlem nasıl da tuzak kurmuş sana

## 57

O güzel sevgiliyi görseydi eğer
Yeryüzüne hiç iner miydi Cebrail

Bir kez nazar kıldım hüsn-ü cemaline
Celil olan Allah'ın nurundan bir ayine gördük

Utandı al dudaklarından şarap kadehi
Anlayınca üzüm şarabıyla selsebilin farkını

Binlerce aşk esirin var bendine bağlı
Lakin bizim yok senden başka sığınağımız

Aşkınla yanıp tutuşan yalnız ben değilim
Nice maktulleri var aşkının benden önce

Derdimize derman sensin ey can
Vuslattan gayrı var mı şifası aşk hastasının

Dicle'ye kapılıp gitti sabr u sükûnumuz
Ondandır Nil nehri gibi akar gözyaşlarımız

Gözlerimden akan yüzlerce çeşme değil sadece
Kanla karışık sel olup akmaktadır gözyaşlarım

Çok nazar kıldık sana baştan ta ayağa
Nazarımız geri döndü bilafaide, akıl da yorgun

Var mıdır ya da olur mu hiç senin eşin
Güneş ortada dururken, delil aramak niçin



*Qed selebe'r-rûhu 'ela xefletin*
*In heceme'l-qelbe bi terfi kehîl*

Ger çi li ber derb û cefan fîl bûm
Bê mefer ez mati kirim şahi fîl

Can diderim, goti bi yek bûse de
Lê bibitin le'lê şekerxa kefîl

Ger çi di nêv helqeyê şêran im ez
*Leyse 'eleyna li 'idana sebîl*

Zori **Mela** firqetê ebter kirîn
*Inne mine's-sa'eti yewme'r-rehîl*

## 58

Şahidê qudsînîşan husn ji remza ezel
Da me bi destê surê camê meya lem yezel

Mey ku biçit saxerê hêj di destê dilberê
Sondê bi Xaliq dixwey Roj e di burca Hemel

Dêm di camê me dî sur di medamê me dî
Lew me ji meyxaneyê girtiye ber der mezel

Her ji kevanê bi weş qebzezerê goşereş
Gezme bi cot tên **Melê** kes dimirit bêecel

Husn û sura sûretê kes diderit qudretê
Lew di esil dûr e jê te'neyê lemma efel

Zor bi tîb tên 'Ereb têk çevandin qeseb
Qenc bi çavan me dîn xîli ne çar û xemel

Şîr û riman vêkra pençe birin têkra
Lîme [d]iken jêkra qîme [d]ikin dil digel

Nazik û qenca şepal dil vegerînit mehal
Lê me ji dil dil bidet dil bi me det muhtemel

Neyşeker û dêmdurê da me bi destê surê
Cam û qedeh şibet av lew me rewan tên xezel

Ger di çehvên **Melê** 'eyn e du 'alem fena
*Zûne fena babikum innehu 'ebdun eqel*



Ruhu çekip aldı ansızın o sevgili
Hücum edince gönle siyah gözleri

Her türlü darbeye ve cefaya karşı fil idiysem de
Birleşip mat ettiler beni çaresiz şahla fil

Can feda olsun dedim, o dedi bir buseye
Dedim; o tatlı lal dudaklar kefil olsun o buseye

Etrafım aslanlarla çevrilmiş olsa bile
Düşman yol bulup gelemez üzerime

Çok şeyden mahrum kıldı bizi bu ayrılık ey **Mela**!
Sevgiliden ayrıldığım gün, tıpkı bir kıyamettir bana

## 58

Güzelliği ezeli remze dayanan kudsi benli sevgili
Ebedi şarapla doldurup sundu bize mübarek eliyle kadehi

O dilberin eliyle mey dökülünce kadehe
Yemin olsun ki Allah'a, o an sanki Güneş, Oğlak burcunda

Yüzünü şarap kadehinde, cazibesini şarapta gördüm
Ondandır meyhanenin kapısını kendimize mesken tuttuğumuz

Sarı kabzalı, siyah çerçeveli kavislerden oklar gelmede üstümüze
Ey **Mela**! Çifter çifter gelse de gamzeler, ölür mü kimse ecelsiz!

Cazibeli, güzel bir sûret yaratmaya kimin gücü yeter ki
Hakikatte uzaktır ondan "lemma efele" tanesi

Araplar ellerinde mızraklarla saldırdılar zorbaca
Doğrusu gözlerimizle gördük Cemel'deki ceng u cidali

Kılıçlarla mızraklar içiçe girdi bir pençede
Lime lime parçaladılar cesedle gönlümüzü birlikte

O nazik ve latif sevgilinin gönlümüzü geri vermesi imkânsız
Lâkin gönlümüzü alanın gönlünü bize vermesi muhtemel

Selvi boylu, inci yüzlü sevgili, mübarek eliyle sundu bize
İçmedeyiz su misali, ondandır dilimizden akar gazeller

**Mela**'nın nazarında her iki âlem fena makamı olsa da
Lakin o, kapınızın eşiğinde herkesten hakir bir köledir hâlâ



## 59

Îr[o] ji remza dêmdurê minnet ku min mesrûr e dil
Dilber bi fincana surê mey da me û mexmûr e dil

Remzek nihîn avête dil mihrê ji batin mêhte dil
Şehzadeyê sur rêhte dil şehkaseya ferfûr e dil

Hostayê ‘işqê dil hevot ser ta qedem hindî disot
Remza “enelheq” her digot bawer bikin Mensûr e dil

Dil dê bidet nûra meyê weqtê sewaş û heyheyê
Fehm er biket wehya meyê jê det xeber me’mûr e dil

Nûra ji qudret lê du nûn jê ra dinalin erxenûn
Wer ayeta ‘işqê bixwûn xweşnusxeyek mestûr e dil

Tefsîrê sirra ayetê ‘arif divêtin guh detê
Raza rumûzên qudretê ger dê biket me‘zûr e dil

Dil Ke‘beya Mewla ye lê narê Kelîm îsaye lê
Bangê “enellah” daye lê hem Ke‘be û hem Tûr e dil

Sed co û sed cobar e tê sed gulşen û gulzar e tê
Çendan ji ‘işqê nar e tê safî nezer dî kûr e dil

Suhbet ku kamil bo berî carek bi cayê ‘enberê
Qelbê me bi avê mecmerê xweş‘enber û kafûr e dil

Şox û şepala leb ji qend ew nazika wey qenc û rend
Wê dil ji dil da der vexwend îro yeqîn Fexfûr e dil

Dil er ji te mesrûr bitin me dê ji **Melê** destûr bitin
Dê ket cehan pur nûr bitin lê daîma rencûr e dil

## 60

‘Îd e û der ‘alemê bangê sefayê xas û ‘am
Mahê new ebrû numandin çû ji ber ‘ewrê xemam

Xweş bi dewrê camê îşaret kir hilalê saqiyan
Mahitab in Zuhresîma çarde salê temam

Name tey kir rozeyê ‘eydê vekir fesla meyê
Lê bi zimzim tên bi awazê neyê fincan û cam

Şahidên gulreng saqî belkî nisrîn in beşer
Ê di lebsê erxewanî nêrgizên ‘er‘er-xiram



## 59

İnci yüzlü yâr remziyle şükür Allah'a bugün mesrurdur gönül
Cazibeli kadeh ile dilber yine mey sundu bize, mahmurdur gönül

Gizli bir işaret atınca gönle sevgiyi içten içe emdi gönül
Dökülünce gönle şehzadenin cezbesi sultani bir fağfurdur gönül

İstila etti gönlü aşk üstadı yanıp tutuştu o anda baştan aşağı
Tekrarlamakta "ene'l-hak" remzini inan şimdi Mansur'dur gönül

Gönle vurunca meyin aydınlığı kavga ve gürültüler hengamında
Anlasa eğer meyin mesajını, ondan haber vermeye memurdur gönül

Kudret nuru iki nûn'dur yüzünde inleyip durmakta ona arganun
Gel de aşk ayetini oku onda yazılmış hoş bir nüshadır gönül

Aşk ayetinin tefsirine iyice kulak vermeli arif olan
Kudret nurunun sırlarını açıklarsa eğer, mazurdur gönül

Gönül Mevlâ'nın Kâbesidir, onda Kelim Musa'nın ateşi parıldar
"Enellah" sesi duyulur onda, hem Kâbe hem Tûr'dur gönül

Yüzlerce ırmak akmada, yüzlerce gül bahçesi yeşermede onda
Aşk ateşiyle taşmışsa da safi nazarla baksan, derin bir madendir gönül

Kemal bulması için sohbetin, bir kez olsun amber yerine
Mecmer gibi kıl gönlünü, hoş kokulu amber ve kâfurdur gönül

O şeker dudaklı latif ve şuh dilber, o ter u taze endamlı güzel
Gönül verip gönül istedi bizden, inan bugün Fağfur'dur gönül

Gönül senden mesrur olsa ve **Mela**'dan destur almış olsa
Dünya nurla dolsa da, aşkından her dem hastadır gönül

## 60

Bayramdır bugün sevinç çığlığı kuşatmış herkesi tüm âlemde
Dağıldı bulutlar, yeni doğan ay gibi göründü sevgilinin kaşları

Sakilerin hilâl kaşları mey kadehini güzelce işaret etmede
Ay gibi aydınlık, Zühre yüzlü güzeller; ondördündedir hepsi de

Sayfasını dürdü Ramazan, bade mevsimini açtı bayram yeniden
Mey kadehleriyle fincanlar, şakırtılarla gelmede ney eşliğinde

Gül renkli giysiler içinde sakiler, tenleri nesrin gibi
Erguvanî giysiler içinde, salınır ardıç ve nergis gibi



Ya Reb ew rûh in mucessem yan mîsalê rûh in ew
Lew li ser canan dibexşin nazikên şîrînkelam

Ew çi ‘alî-cewher in hatî libasê can û cism
‘Işweyên wan şibet iksîrê di qelban in meqam

Wek **Melê** gavek tinê xaib ji dîdarê [d]ibim
Dîn [d]ibim wê sae‘etê lê bin ji min da sed selam

## 61

Daneyên ‘enber li nisrînan reşandî dam dam
Sosinên nazik li ser xalan çevandî dam dam

Cebhet û dêmê ji qudret pê nivîsî herf herf
Kagulan ta ta li ser herfan kişandî lam lam

Ew perî weqtê di sundus da ji qundus bin xweya
Bendeyê şahê Humayet Xusruwê şîrîn xulam

Leyletulqedr û berat in zulf û cebhet subhê ‘îd
Dêm wekî fesla biharê lê qiyamet qedd û qam

Herkesê camek ji destê wê binoşit noşi bî
Ê ji destê wan nenoşî zehri pê bit ew medam

Herkesê carek diye ew zinde ma hetta ebed
Ê nedîbit ew perî dê zindegî lê bit heram

Wan di reqsê da ku dîm a[w]ir peyapey dan **Melê**[21]
Berq û tîrêjan li dil da cezbeya ‘işqê revam

## 62

Îro ji husna dêmdurê dîsa helak û serxweş în
Remzê di wê şîrînsurê sotim bi pêta ateşîn

Sotim bi berqa lami‘ e ew necm û bedra tali‘ e
Şemsa semayê rabi‘ e lew pur ji şewqê şewwişîn

Pur şewwişandî wê dil e zulfa siyah ser da mil e
Tora vedayî silsil e selwî ‘eqarib lê xwuşîn

21 Di nusxeyên din de mexlesê Mela di vê beytê de nebû. Di wan de beytek li pişt vê beytê dihat ku ew di vê nusxeyê de nehatiye.



Yâ Râb, mücessem ruhlar mıdır, yoksa ruh-misal varlıklar mıdır
Ki tatlı sözlerinden her biri için canlar bağışlanmakta

Ne yüce cevherdir ki giyinmişler cism u can libasını
Ölü kalbleri dirilten iksir gibidir işveleri

Bir lahza olsun mahrum kalırsam didarından **Mela** gibi
On an divane olurum, yüz selam olsun artık benden ona

## 61

Amber tanesi kara benler, serpilmiş beyaz güller üzerinde
Zülüfler dal harfi olmuş, tuzak kurmuş benler üzerinde

Dest-i kudret harf harf yazmış sevgilinin yüzünü
Kâküller lâm harfi gibi bukle olmuş harfler üzerine

Karanlıktan çıkıp görününce ince kaftanı ol perinin
Şahlar köle olur, köleler Hüsrev'e dönüşür o tatlı dilli karşısında

Kadir ve Berat geceleridir zülüfleri, alnı bayram sabahı
Yüzü bahar mevsimidir ama kıyametler koparmada endamı

Kim ki onun elinden içmişse her daim afiyet olsun ona
Ellerinden içmemiş kişiye içtiği her dem zehir olsun ona

Ebediyyen zinde kalır bir kez görenler onu
Hayat haram olur o peri yüzlüyü görmeyenlere

Güzeller görünce raksta gamzeler gönderdiler **Mela**'ya durmadan
Şimşekler çaktı gönlümde o an, aşk cezbesi aldı beni benden

## 62

Ay yüzlünün güzelliğinden bugün perişan ve sarhoşuz yine
O tatlı dilberin remizleri yaktı bizi ateş gibi yine

Yaktı bizi parlak şimşeklerle; o bir yıldız ve yükselen dolunaydır
Dördüncü semanın Güneş'idir o kamaştı zihnimiz o pür ziyadan

Karıştırdı gönlü yine o güzel omuzlara dökülmüş siyah zülüfler
Dizi dizi ağ ve tuzaklarda siyah akrepler gibi geziniyor üstünde



Selwa ‘eqarib lê weten ew nazika sîmînbeden
Qendê dirêjin kef diken biskan lê kir baweşîn

Biska siyeh re‘nayê mest yek dî ku heyran pê vebest
Hemyan li mestî helqe best der bendê wê zulfa reş în

Êxsîr kirim zulfa çelek ew horiya nisbet melek
Tîr dan ji reştûzên helek mecrûhê qewsê purweşîn

Tîr dan ji qewsê malzirav ew gewhera pur şewq û tav
Sotin li min sîne û hinav lew têk ji cergê herrişîn

Cerg û cesed têk sotine lew xef xedengan nuhtine
Ji qewsê hilalî jeh çûne heyranê dêma mehweş în

Hem bedr û hem Zuhr[e] ye dêm hem ji ‘alema kubra ye dêm
Xweş destxetek tuxra ye dêm herfan ji miskê reş reşîn

Lewhê ji nû sîqal beden her [ji] nû ve xal beden
Da dil bi yekdî pal beden nuqtan ji zêravê weşîn

Zulfa siyeh ‘enber bike xemlê ji zêrê zer bike
Zerbav û dîban ber bike misk û gulavê lê reşîn

Mawer ke terh û bişkuwan cîranê belga lu’luwan
Ez ‘er‘er û selwa cuwan şetrî bi mestî lê xwoşîn

Şetrî we tayên sor û zer ba[y]ê nesîm lê da seher
Ber cebhetê hijyan du per em ji wê sukar û bêhiş în

Meşha seher yarê şefîq da min bi enguştên ‘eqîq
Hej badeya nûrînrehîq mexmûrê xemra bêxiş în

Mexmûrê wê camê ez im yexmagerê damê ez im
Çavên li peyxamê ez im perwaneyê şem‘a geş în

Perwane yîm sotîkebed dilber ji ber burca esed
Tîr dan ji reştûzên Semed lew têk ji xwûnê neqqişîn

Kuştim bi qewsê ‘enber e şoxê ji dil mil dan ber e
Êxistne dil sed pencere evrenge em mihnetkeş în

Mihnetkeş în roz û şebê der ferqê şîrîn-xebxebê
Zulma ji ber destê te bî ew ‘edl e em pur pê xweş în

Zulma tu key pir pê xweş im sotîdil û hicrankeş im
Mislê perenga ateş im rûhek mucerred bêleş în

Min dî sehergaha elest camek ji kewser dest bi dest
Jê da **Melê** lew bûme mest hetta hisabê serxweş în



Yer edinmiş o selvi boyluda akrepler o parlak nazik bedene
Şeker dökmede o sözler, o gülüşler perçemleri sanki bir yelpaze

Mestanedir zarif siyah perçemleri bir başkası var bağlı ona
Mestane bir halka olmuş hep beraber bendesiyiz siyah zülüflerin

Esir kıldı beni o çengelli zülüfler o melek sıfatlı güzel dilber
Siyah kirpiklerinden üstümüze atılan oklarla yaralandık

Oklar attı üstümüze ince yaydan; o cevher gibi parlayan sevgili
Yaktı sinemi ve derunumu; yaralandığımız ondandır ta ciğerden

Yandı ciğerle ceset tümüyle oklarla deldi onları gizlice
Yok bir benzeri hilal kaşlarının, hayranıyız o ay yüzlünün

Hem dolunay hem Zühre'dir yüzü hem de büyük âlemden numune
Hoş bir hatla tuğradır yüzü, miskten yapılmış simsiyah harfler üstünde

Parlatın o yüzü yeniden her dem ona benler verin yeniden
Ta ki gönüller dayansın birbirine altın suyundan damlalar serpin

Amber kokusu serp siyah zülüflere sarı altınlarla süslen
Altın işlemeli elbiseler giyin miskle gül suyu serp üstüne

Gül suyuyla yıka zülüflerini ve komşuları olan alınlıkla incileri
O selvi boylu narin sevgilinin takıları mestane sesler çıkarsın

O sarı kırmızı iplerdeki süslere bâd-ı sabâ vurdu seher vaktinde
Salındı yüzündeki iki perçem ondandır mest u sekran olduğumuz

Geçerken seher vakti o müşfik yâr akik parmaklarla sundu bize
Bir kadeh o saf şaraptan, mahmuruz hâlâ o katıksız şaraptan

O kadehin sarhoşu benim, tuzağına düşüp yağmalanan benim
Yârdan haber bekleyen benim, o parlak mumun pervanesi benim

Yanmış ciğerim pervane gibi, aslan burcunda olan dilber;
Samedî siyah kaşlarından oklar attı kana buladı her yanımızı

Öldürdü beni amber kâkülleriyle, oklar fırlattı gönülden o şuh
Açtı kalpte yaralardan yüz pencere işte hep mihnetkeşiz böyle

Mihnetkeşiz gündüz gece ayrılığından o tatlı gerdanlının
Senden gelen zulüm adalettir bizim için, ondan çok hoşnutuz

Zulmünden pek hoşnudum yanık gönüllü ve hicran içreyim
Ateşten bir kor gibiyim, bedenden sıyrılmış bir ruh gibiyim

Elest seherinde gördüm elden ele dolaşan bir kevser kadehini
Bir yudum verip mest etti **Mela**'yı, ondandır kıyamete dek sarhoşuz



## 63

Were canim ku çi nazik weres în
Ji gul û nesterînan em te bes în

Tu şihînşahî bes î min ji butan
Ne muhib her mekes û xar û xes în

Ji xwe xanim me vida key tu be tîx
Tu nebat î we li teb'ê meges în

Her şevem ne'rezenan ta bi seher
Bi segê koyê te ra hemnefes în

Bê te billah nebû kes nefesek
Me tu yî rûh mucerred qefes în

Cezbe dil ra dihejînit me lew
Di şevan nale ji rengê ceres în

Me ji zulfên te siyeh reş în bext
Seherê bêy û berî pê nehesîn

Were meyxaneyê şahidperisan
Şem'ê meclisê be dê bînî çi kes în

Me ji tarî diye nûra te di dil
Lew di 'işqa te her ateşperes în

'Eynê 'işq în û di dil ateşê Tûr
Ji sena berqê cemalê qebes în

Te divê ew biberî nehe da
Ser birim jê bi du enguşt meqes în

Ger çi yekrû li rexên [fili]sifet
Rast û çep bazê li seyrê [f]eres în

Bi meyê safî bideyn xirqeyê zerq
Bi xerabatê muxan er biresîn

Em qedîm bade dinoşîn ji tuhûr
Lew muqîm mest û xumar û teles în

Me şevan cam di kef yarê di ber
Hey hey û suhbet û mîrê 'eses în

Me seraperdeyê hûran e meqam
Ji siyeh zulfê butan er veresîn



## 63

Gel ey can, ne narin al renkli nebatsın bize
Güller, nesrinler içinde sade sen yetersin bize

Yetersin bana ey şah, güzeller güzeli sevgili
Asaletsiz diken ve otlardan olmaz yâr bize

Dergâhından uzaklaştıramazsın bizi kılıç zoruyla
Sen tatlı bir şeker kamışı, ona üşüşen sinekleriz biz

Nara atıp durmaktayız her gece sehere dek
Senin muhitinin köpeğiyle hemnefesiz biz

Billah bir an bile senden gayrısıyla almadık tek nefes
Ruhumuz sensin çünkü, sadece ona bir kafesiz biz

Gönlü çelip titretmede bizi aşk cezbesi
Ondandır gece boyunca zil gibi inleyişimiz

Sevgilinin zülüflerinden siyahtır bahtımız
Seherde varıp gidersin de farkına varmayız

Sevgiliperest âşıkların bulunduğu meyhaneye gel
Meclisin mumu ol da bir gör kimiz biz

Zulmetten gördük gönüldeki nurunu
Aşkındandır her daim ateşperestliğimiz

Aşkın ta kendisiyiz biz, gönlümüzde de Tur ateşi
Sevgilinin güzellik parıltısındandır iktibasımız

Şimdi hemen istiyorsan iki parmağımla;
Keseyim başı, ki bilesin keskin makasız

Gerçi, satrançtaki fil gibi yan hareket etsek de
Sağlı sollu harekette tıpkı atın rolündeyiz

Ulaşırsak şayet harabat-ı muğana
Riya ve hile hırkasını verip saf şarap alırız

Tertemiz kaynağından içmekteyiz badeyi ta ezelden
Ondandır hep mest, mahmur ve dağınık oluşumuz

Elimizde kadeh yanımızda sevgili var her gece
Kahkahalarla sohbet ederiz, murakıplardan yok korkumuz

Huri güzellerin yaşadığı sultan çadırıdır makamımız
Kurtulursak eğer siyah zülüflerinin gölgesinden sevgililerin



Qelbi e'yan digerit hub di wucûd
'Işqê iksîr e we em sîm û mes în

Mulhimê xeybê we îmla digerit
Meded û feyz ji Rûhilqudus în

Cewhera 'alî ye 'unsur me **Mela**!
Bi heqîqet ne ji xara te'es în

## 64

Peyweste du ebrû li me mehbûbê kişandin
Sed gezme peyapey li ezê xeste reşandin

Tîrek ji kemanê xezebê da cegerê rîş
Mil dane ber û pir ji du goşan veweşandin

Cohtê esedan pence li ser sîne nihandin
Kullabi gihandin dil û hestî herişandin

Birhên te ji qudret ku numan goşe ji î'caz
Peyweste kemanan li guhan goşe weşandin

Mihra te di canê me ji dil xef kiribû min
Dil çû ceger û sîne li ser canî ve şandin

Nûnên te hilalî bi qeran yek ji sura heq
Bê 'eybi li dêmî qelemê xeybê keşandin

Neqqaşê ezel ismê cemalê ku nivîsî
Herfên di mucessem ji surê taze reşandin

Reyhanî û dîwanî û hem sulis û muselsel
Yek yek we hezar rengi li husnê neqqişandin

Ev ayetê nûrê ji **Melê** ra ku nivîsî
Katib ji surê nuqte bi zêrabê feşandin

## 65

Mela me l'gerdena dilber ji nû sed bûse mayin deyn
Mecalê ez dê bixwazim jê dibê deynê te fewqel'eyn

Bi remza qabê qewseynî ji wan birhan xeberdar im
*Fe ati'l-qewse barîha ela ya ramiye'l-qewseyn*



Varlıkta ayanı tersine çevirir sevgi
Bir iksirdir aşk, bizse gümüş ve bakırız

Gaybı ilham eden Allah böyle icra eder hükmünü
Ruhulkudüs'ten gelir meded ve feyzimiz

Çok yüce unsurdandır varlık cevherimiz ey **Mela**!
Doğrusu, süfli ve aşağı bir unsur değiliz biz

## 64

Sevgili bir yay gibi gerdi üstüme art arda kaşlarını
Ben yaralıya yağdırdı peşpeşe yüzlerce oklarını

Bir tek ok fırlattı gazap yayından yaralı ciğerime
Hedeften vurmak için iyice germiş onu iki köşesinden

Gözler iki aslan gibi göğsüme geçirdi pençelerini
Tırnaklarıyla parçaladı kalbimi, ufaladı kemiklerimi

Rabbani kaşların görününce i'caz köşesinden
Fırlattı yayları hemen kendi köşelerinden

Aşkının sırrını gönlümde saklamıştım ben
Gönül gitti, ciğerle sine de dağıldı ruhtan sonra

Nun gibi hilal kaşların Hakk'ın güzelliğinin nişanesi
Kusursuzca çekmiş yüzüne kalem-i gayb onları

Nakkaş-ı Ezel yazmaya başlayınca ism-i Cemali
Yeni bir güzellik serpti mücessem harflerinin üstüne

Reyhanî, divanı; hem sülüs ve müselsel hatlarla
Bir bir nakşetmiş güzelliğini bin bir renk içinde böylece

Bu ayet-i nur olan yüzü **Mela** için yazdığında
Güzellikten altın suyu serpmiş noktalar üstüne katib-i kudret

## 65

Yüz buse borcu var bize sevgilinin ey **Mela**
İsteyince, "baş göz üstüne" der her defasında

Kab-ı kavseyn remziyle haberdarım o kaşlardan
Ey oklar fırlatan sevgili, getir ehline ver onları



Ji sirra la mekan wacib tenezzul kir di imkanê
*Fe eyne'l-'ilmu eyne'l-'eyn eyne'l-eynu iz la eyn*

Ji mabeyna du ebrûyan peyapey berqê lami' tên
Bi 'eynê ger bibînî safi nûrek sirf e ew mabeyn

Bi destûra te wê gavê ji vî navî berî bim ez
*Fe seffi'l-'eyne [nûre'l]-'eyn ela ya zeyne kulli'z-zeyn*

Buhayê 'işweyek le'lan me yekser ma melik bexşî
Dil û can jî li ser danî û zalim hêj dibêji[t] deyn

**Mela** her wî bibîn her wî ku tu her wî dinasî tu
Huwe'l-mewcûd huwe'l-meşhûdu bel la xayre fi'd-dareyn

## 66

Remza te di canê me bi endazeyê razan
Her yek bi hezar reng rewanê me dixwazin

Wan derb li canê me ye wek berq û birûsk e
Remzên te di qelban ne tinê sînegudaz in

Cana ji cefaya te û zulmê çi xeber den
Kez tîrê ji cewra te di dil da me çû gazin

Ger husn û mehebbet li seraperdeyê can bin
Geh şah û geda geh bi xwe Mehmûd û Eyaz in

Quddûsî û subbûhî û hûrên di Beheştê
Peyweste şebê qedrê lîqaya te dixwazin

Perwane û bulbul ji dil şu'leyê 'işq in
Lê ger tu nezer dey bixwe ew "gulşenê raz" in

Sunbul bi sema tên û gulan perde dirandin
Bişkiftine alal û hişîn bûne terazin

Cobar rewan in çemenan terh cuwan in
Mestane bi ref ref li kinaran sî û qaz in

Her yek bi temaşagehê husna te ji her ca
Teşbîhê nigaran bi cemala te di naz in

Mihrabi du ebrû ku ji bala ve xweyabin
Der secdegehê 'işqê niyazê me nimaz in



Lamekân sırrından imkân âlemine tecelli etti Vacibü'l-Vücud
Nerde ilim, nerde zat, nerde mekân, "nerde" diye bir şey yok

Art arda şimşekler çakmaktadır kaşların arasından
Ne mutlak bir nurdur o, gözlerinle bir görebilsen

O an izninle bu isimden tamamen beri olacağım
Ey gözümün nuru, güzeller güzeli, temizle gözlerimizi nurunla

Tüm servetimi verdim lal dudakların tek bir işvesine
Borçlu çıkardı beni zalim, ruhumla gönlümü verdimse de

Ey **Mela**! Her dem onu gör, her dem onu an, her dem onu tanı
Odur Mevcud, odur Meşhud, dareynde yok ondan gayrısı

## 66

Gönlümüzdeki remizlerin sırlarla ölçülemez
Bin bir türlü yolla cânımızı istemede onlardan her biri

Ruhumuza indirdiği darbeler yıldırım ve şimşek gibi
Gönüllerdeki remzlerin yürekleri yakmıyor sadece

Ey sevgili, ettiğin zulüm ve cefayı nasıl ifade edeyim
Kalbimize sapladığın zulüm okların için yok hiç sitemimiz

Güzellik ve sevgi ruh çadırında oturuyorsa eğer
Her biri gâh şah u geda, gâh Mahmud ile Ayaz'dır

Semada subbuhilerle kuddusi meleklerle cennetteki huriler
Kadir gecelerinde daima senin likana kavuşmak isterler

Pervane ile bülbüllerin gönlündeki aşk şulesidir
Onlara dikkatle baksan aslında sırlarla gül bahçesidir

Raksa gelmiş sünbüller, perdelerini yırtmış güller
Açılmış taze laleler, yeşerip donanmış çimenler

Irmaklar akmada, çimenlerde körpe dallar açmada
Öbek öbek kazlarla ördek mestane gezmede su başlarında

Güzelliğinin seyrine koşup gelmiş herkes her taraftan
Süslenmiş sevgililer gibi, senin cemalinle naz ederler

İki kaşının mihrabı görününce bize yükseklerden
Aşk secdegâhında niyazımız namazdır bizim



Tîran li me det dost me dê sîne hedef bit[22]
Nazan li me ket nazê me zarî û niyaz in

Ev hûr û perî çehre but û latê cemalê
Der sûretê tehqîq **Mela** ‘eynê mecaz in

## 67

Muhbet û mihnet di zor in hub dibêm bêşek bela ye
‘Umr û jî, xweş pê diborin sotin û derd û cefa ye

Sotin û derdê evînê ‘illeta dax û birînê
Xweş dibit ma ew bi dînê şerbeta lêvan mufa ye

Her dilê sotî bi ulfê yar ne derman ket bi zulfê
Ta ebed ew ma di qulfê ‘işq derdek bêdewa ye

‘Işq derdek bêtebîb e lê mufa wesla hebîb e
Kuştime cewra reqîb e pur le‘înê rûsiya ye

Dax û key min lê hezar in gul di dest şewkên bi xar in
Sur[p]erî dêw li kinar in Ehremen xatem reva ye

Teb‘ê dêwan dest gehiştê hûr û wîldanê Bihiştê
‘Aşiqê dilbendê qiştê can bidet hêja rewa ye

Mihnet û cewra hebîbî [qehr] û azara reqîbî
Heq tinê da min xerîbî lê şukur Baxwoy we daye

Rohniya wê şewq û tavê şerbeta qend û gulavê
Kes nihin mehrûm ji navê lê tinê bo min xela ye

Bênesîb ez bûm ji camê dûridûr mehrûm ji ramê
Girtiyê wê qeyd û damê ev xerîbê canfida ye

Dûredest im bênesîb im dilberim xanim hebîbim
Pur ji dîna te xerîb im rûh û rahet min lîqa ye

Pur mulazimê te û lîqayê mame hetta multeqayê
Min rihê şîrîn [didayê] hudhud er mizgîn bidaye

Hudhudê ridwanê xeybê sed xeber şîrîn ji ceybê
Da dilê me’y murde hey bê guh li rê min wek seba ye

Çavnêr im guh li rê me, lê seba duh daye pey me
‘Erzihalê mihnetê me bendeyek sadiq **Mela** ye

---

22 Beytek piştî vê beytê heye ku di nusxeyên dî de hatî lê di vê nusxeyê de nehatî.



Sevgili oklarıyla vurmak isterser, sinemizi hedef kılarız
Bize naz ederse de bizim nazımız yalvarıp yakarmak olur

Güzelliğin birer putları olan bu hurilerle peri yüzlüler
Gerçekte hakikat değil, tamamıyla mecazdır ey **Mela**!

## 67

Mihneti çoktur aşkın, şüphesiz bir beladır aşk
Hoş geçer onunla ömür, derd u cefa ile yanmaktır aşk

Aşkın dertleri, yanışları, dağlamakla diner mi yaraların illeti
Dudakların şerbetinden gayrı şifâ olur mu bunlar tek başına

Ülfetle yanar gönül, zülüfleriyle derman olmazsa sevgili
Ebede dek mahpustur gönül, devası bulunmaz bir hastalıktır aşk

Tabibi olmayan bir derttir aşk, ilacı vuslattır onun
Pek lanetli, kara yüzlü rakibin zulmü öldürür beni

Binlerce dağlamalar var bedenimde, gül esir düşmüş dikenlere
İfritler sarmış nazlıların etrafını, mührü çalmış Ehrimen

İfrit tabiatlı rakiplerin eli Cennet hurileriyle vildanlara uzandı
Gönlü kâküllere bağlı olan âşıklar can verseler yeridir şimdi

Sevgilinin eza ve cefasıyla rakiplerin kahr u azarını
Şükürler olsun Hak sadece ben garibe vermiş bunların cefasını

O nurun ve tabın aydınlığı, gül suyuyla, şeker şerbetindendir
Benden başka mahrum yok, kıtlığına düşmek sadece benim içindir

Nasipsiz bir bendim bir kase şaraptan, mahrumum rahattan
Esir düşmüşüm tuzağına, sevgiliye can fedadır

Uzaklardayım, elim ulaşmaz sana, ey gönlümü çalan sevgilim
Seni görmekten mahrumum, ruh ve rahatım vuslatındadır

Sevgiliyi ve vuslatını çok gözledim durdum yollarda
Tatlı canımı verirdim hüdhüd bu müjdeyi verseydi bana

Yüzlerce tatlı haber var sevgiliden rıdvan-ı gayb olan hüdhüdde
Dirilir onunla ölmüş gönüller, haber beklerim bâd-ı sabâ gibi yollarda

Yollarını gözler, beklerim lakin saba yeli dün düşmüş peşimiz sıra
Muhabbet mektubunda “bize sadık yalnız **Mela** kaldı” diye yazılı



Canfida me ez di rê da firqetê derbek we lêda
Qalibek bêrûh e wê da kuştina min wê rewa ye

Dem bi dem ew çavinêra bêt û nîşanek te jê ra
Da bibit ew zêde jê ra yarê sadiq bêbuha ye

‘Aşiqêt sadiq di kêm in yar dibê sed xan fidê min
Zanim ew najît bê min ‘aşiqe pur mubtela ye

‘Alim în em vê dizanîn cism in em, ew rûh û can în
Qet ji hev batin xweya nîn gerçi zahir ew cuda ye

Hudhudê wê xemz û razê pur newa çû goft û sazê
Qisse çû behsa mecazê qasidek xweşteb‘ ba ye

Ma dema weqtê mecal da çû ku yarê me di pal da
Qisseya halî bi hal da guh didêrit yari piha ye

Muhbeta mehbûb û latan ber veke zîwersifatan
Daye qelb û rûh û zatan roj di mir’atê xweyaye

Muhbeta sûret du qism e [qufl] û miftah û tilism e
Hin ji rûh e hin ji cism e nar û nûr e hin hewa ye

Hubbê cismanî du roj in gerçi dil pir pê disojin
Xef ceger peykan dinojin mîlê neqşê bêbeqa ye

Gul heta sor in bi tê ve tên tebessum xonçe pê ve
Bulbulê serxweş di nêve nexme û nal û newa ye

Herçi cilwa bû ji navê nû gulek girtî xunavê
Wî ji dil çû muhbeta wî ew bi ya dî ra teba ye

Herkesê muhbet ji rûh e mubtela nûra Subûh e
Wî di dil de sed curûh e cezbe ye lerzîn û ta ye

Herdu rûh yek nûr û tav in çerxek e du seyr di nav in
Herdu dane’w murx û dav in ismê “Husn” dav lê veda ye

Nûreke nadir wucûd e gerçi ewwel nar û dûd e
Berqe lamî‘ ma li kû de hub di qelban kîmiya ye

‘Arifê cewherşunasî ê bi vî wesf û lîbasî
Dê qedir pitir binasî meq‘edê sidqê ceza ye

Dûr nekî da tu j’derê xwe wernegêrî jê serê xwe
Borîn ew di serê xwe ser di nava rê niha ye



Yolunda cânım fedadır lakin ayrılığın darbesi vurdu böylece
Ruhsuz bir ceset kaldı şurada, katlime ferman onun için revadır

Yolunu gözleyen bâd-ı sabâ gelse de senden bir işaret getirse bize
Bu olur ona en büyük hazine ki kıymeti biçilmez sadık sevgilinin

Yâr der: Sadık âşıklar pek azdır, bana olsun yüz sultan feda
Bilirim bensiz yaşayamaz o âşık her derde müpteladır

Biz bu gerçeği biliriz; biz birer beden, onlar ruh ve candır
Görünürde ayrı gibi olsa da hakikatte bunlar birdir

O pek çok sır taşıyan hüdhüd sazı ile nağmelerle başladı söze
Güzel bir elçi olan rüzgâr mecazi bir kıssa ile anlattı hâlimizi

Vakit bulunca bâd-ı sabâ ziyaret için, uzanmış buldu sevgiliyi
Anlattı kıssamızı ona lisan-ı hâl ile sevgili pürdikkat dinledi onu

Sevgililere olan muhabbet süslü sıfatların kapısını açar kolayca
Gönül aynasında görünen güneş kalp, ruh ve zata aksetmiş

Görünüşte sevgi iki kısımdır, kapalıdır kilit, tılsım ve anahtarla
Bir kısmı ruhtan bir kısmı cisimden; diğeri ateş, nur ve hevadır

Bir iki günlüktür cismani sevgi, gönülleri çokça yaksa da
Ulaşmış olsa da oklar ciğere, çabuk silinen bir nakıştır sonuçta

Tomurcuklanıp açtıkça güller ve tebessüm ettikçe dallarda
Mest olmuş bülbül, feryat ve nağmelerle şakıyıp durur aralarında

Derildikçe eski güller ve çiğ düştükçe yeni güller üstüne
Kaybolur sevgisi bülbülün eski güllere, ram olur yenilerine

Sevgisi ruhtan gelen kimse münezzeh nura olur müptela
Böyle gönüllerde yüzlerce yara, cezbe, titreyiş ve humma olur

Bir Güneş'ten beslenir âşıkla maşuğun ruhu, bir semâda iki seyr içreler
Her ikisi yem, kuş ve tuzaktır, ki "Hüsn" ismi onlara kurmuştur tuzak

Az bulunur bir nurdur o, ateş ve duman olsa da önceleri
Parlak şimşektir aydınlatır vurduğu yeri, kalblerin kimyasıdır aşk

Cevhere aşina ariflerden bu elbise ve vasıfta olanları
Herkesten çok bilir kadrini, zira "mak'ad-ı sıdk"tır mükâfatı

Kapından uzak kılma onu, çevirme yüzünü ondan
Yoluna başını koyup vazgeçmiş çünkü cânından



Ma dibit ew dûredest bin dê ji fincana te mest bin
Cam ji şehkasê bi dest bin ebteran ew mey dewa ye

Yari pir husnek li bal bû dilberek xayet cemal bû
Ew ji hal ageh bi hal bû pîşeyê wê şefqe'w 'eta ye

Mehdera wê xêrxwazê nukteyek wesfa mecazê
Wê bi dil seh kir ji sazê muxnî û qanûn û nay e

Yûsufê dewr û zemanî go nesîm hat vî nîşanî
Bêje bo kî ew te anî nexweşan ew lê şîfa ye

Mawera belgên gulê bû bêhn û boya kagulê bû
Darûwê qelbê **Melê** bû lew bi çavên dil cela ye

Ya nesîm dê çî lezînî sax û salim ma tu bînî
Vî kumêdî pê gehînî da suwar lê bit peya ye

Xefletê bayê nesîm hat xef ji bal yarê kerîm hat
Pur bi ihsanek 'ezîm hat qasidê şahê geda ye

Dil nefes dîsa bi ber hat lew Hekîm Luqman bi ser hat
Nafi'ê derdê ceger hat tali'ê kewkeb numa ye

Min ku ew nîşan geheştê ev dilê sed daxê reş tê
Zerreyek lê xweş nehiştê ismê e'zem bê giha ye

Çûme ser pişta kumeydî min ji ber çûnê ku key dî
Behr û ber me l'ber xwe tey deşt û çol û kelbela ye

Me'w nesîm xweş pençe têkra wê diçîn wek teyri vêkra
Behsê zulfa yar e vêkra borê 'işqê pur fira ye

Gunbeda nûrîn xuyabû spêdeya sadiq numabû
Yek bi yek şewqê veda bû qesr û eywan û sera ye

Qumrî û bilbil dixwînin lê 'eceb ew xweş dimînin
Her seher mehbûb dibînin 'endelî[b] vê ra teba ye

Baxçeya sorgul di geş tê çîçek û reyhan di reş tê
Dilbera seyran û geştê sunbulan ta ta sema ye

Sebzeya şebnem gulav lê her 'eqîqan dor xwunav lê
Dilberê seyran û rav lê 'er'eran sih ta bi ta ye

Bûm şerîf ez b'asitanê şahidên wê gulistanê
Saqiyan ca cam didanê kewkeban seywan vedaye



Elini uzak tutamazlar senden asla, aşk şarabınla mestler çünkü
Şahane kadehler olsun ellerinde, divane olanlara o mey devadır

Çok güzelliklerle zengin gayet cemalde bir dilberdi
Hâlden anladı hâlimizi, şefkat ve lütufkârlık onun huyudur

Muganni, kanun ve neyden gönül yoluyla anlayınca
Mecaz yollu bir nükte ile şefaatını isteyip kabul eyledi

Zamanın Yusuf'u dedi: Geldi bâd-ı sabâ bu işaretle
De ki; bunu kim için getirdin şifa olur o hastalara

Gül yaprağının suyu ve kâküllerinin kokusu idi
**Mela**'nın gönlünün devası idi ki gönül gözünü aydınlattı

Çabuk es ey bâd-ı sabâ henüz hayatta iken sevgili
Ulaştır ona bu atı ta ki süratle gelsin, yayadır çünkü

Esip geldi bâd-ı sabâ gizliden keremli yârin semtinden
Büyük hediyelerle geldi, elçidir çünkü sultan-ı fukaranın

İnşirah buldu gönül yine, Lokman-ı Hekim geldi diye
Ciger yarasının dermanı geldi, saadet yıldızı doğdu üstümüze

Ulaştığında bana o nişan, yüzlerce kara yarası olan bu gönülde
Bir zerre sağlam yer bırakmadı; şifâ buldu ulaşınca ism-i azam

Binince rüzgâr atına, çok acılarla yaralar gördüm kendimde
Deniz ve kara, çöl, sahra ve Kerbelâ dürülmüştü önümde

Binince bâd-ı sabâya bir kuş gibi uçtuk birlikte
Hızlıdır aşk bineği elbet, andığımızda yârin zülüflerini

Göründü nurlu künbed uzaktan, ışıdı üstümüze fecr-i sadık
Parıldadı uzaktan birer birer köşkler, eyvanlar ve saraylar

Ötmede bülbüllerle kumrular, ne acep sürmede neşeleri
Her seher görürler sevgiliyi, andelip de onlara eşlik etmede

Kırmızı gül bahçesinde, çiçek ve reyhanla birlikte
Seyrana çıkan dilber ile sümbüller tel tel gelir semâ'a

Şebnem düşmüş üstüne gül suyundan, her akikin çevresinde çiğ
Dilber dolaşıp avlanmada, ardıçların gölgeleri tel tel uzamada

Müşerref olunca asitana tanık oldum gülşendeki güzellere
Sakiler sunmada kadehleri, yıldızlar ise çadır kurmuşlar



Çendekê çîmen herem bû lê medam wek subhedem bû
Min Bihişt baxê Îrem bû lê seba go min siya ye

Sef bi sef wildan perî bûn bendê zulfa ‘enberî bûn
Têk li dînê muşterî bûn reqs û govend û sefa ye

Pur ‘umir min çû bi sextî lê şukurxwaz im ji bextî
Zuhre bû ew yek li textî belku bêm Şemsi’d-duha ye

Perdeya xelwê ku hilda yengiyek min dî di mil da
Gezmeya jehrî li dil da qet nego qetl û xeta ye

Hadirî çûm secde jê ra lê niyet îhram me vê ra
‘Aşiqê ev gezme tîra herçi ta‘et ket rewa ye

Çûm ziyaret pê û destî lê nehişt ewwel bi qestî
Min bisojin rûh [û] hestî ‘aşiqan sotin ceza ye

Şerbeta wesla xwe nadet yar heçî ‘aşiq ceza det
Dilberan evrenge ‘adet mehruwan kemter wefa ye

Pîşeyê mehbûb naz e sen‘etê ‘aşiq niyaz e
Yar li bêrî da îcaze şerbeta şîrîn mufa ye

Çûm tewafa pê û destan şubhetê sekran û mestan
Ehlê hal û x[ub]perestan wan ji ‘umr ev mudde‘a ye

Tilliyên nazik şemalîn min li ser çeşmên xwe malîn
Talibê werdên bixal în dil bi vê fikrê teba ye

Çû ‘umir me d’vê xeyalê ma şevek ‘îda wisalê
Bêm ziyaret zulf û xalê roj û şev min ev du‘a ye

Çerx tirsim ket şitabê zû ecel pê det rikabê
Can biret me d’vê ‘ezabê ev siyahreng ejdeha ye

Çendekî sadiq cema bin er bibêjî can fida bin
Wek **Melê** lazim çu nabin wî ji dil canê xwe daye

## 68

Dilberê serdarê xuban ez nizam ageh heye
‘Arif e bi halê qulûban ‘ilm bi halê me ye?

‘Alim e bi daxên fuadan gezmeyên wan “nûn” û “sad”an
Çûne dil hetta bi radan yengiyê reşgoşe ye



Ulaştığımız bahçe gerçi harem idi, vakit onda hep sabahtı
İrem bahçesiydi Cennet'im lakin Sebâ karanlıktayım diye fısıldadı

Saf saf olmuş vildanlarla periler amber kokar zülüflerindeki halkalar
Hepsi de onun yüzüne müşteri oldu; raks, oyun ve safa içinde

Meşakkatle geçti ömür, yine şüküretmedeyim bahtıma
Zühre idi parlaktı tahtında, yüzü tıpkı şems-i duha

Kaldırınca halvet perdesini yengi bir kavis gördüm omuzlarında
Zehirli bir ok sapladı gönlüme katl u günahtır demeden

Secdeye kapandım önünde hemen, niyet ve tekbir getirmeden
Kalbine bu oklar saplanmış âşık için her tür ibadet mübahtır

Kapandım el ve ayaklarına, kabul etmedi önceleri bilerek
Yansın diye ruhum ve bedenim; ki yanmak cezadır âşıklara

Sevgililer vermez vuslat şerbetini, âşığı cezalandırmayınca
Böyledir âdeti dilberlerin, vefası azdır ay yüzlülerin

İşve ve nazdır adeti dilberlerin, yalvarmaktır sanatı âşıkların
Evvelden verdi yâr fetvayı, tatlı şerbetten içmek şifadır âşıklara

Kapandım el ve ayaklarına yeniden mest ve sarhoş olarak
Ömür boyu budur uğraşları ehl-i hâl ile güzelsevenlerin

Hasta gözlerime sürdüm mum gibi ince, nazik parmaklarını
Benlerle süslü gülleri isterken, şaşkındır gönül bu düşüncelerle

Tükendi ömrümüz bu hayalle, bir gece kaldı vuslat bayramına
Ziyaret etsem zülüflerle benlerini, budur duam gece gündüz

Korkarım çabuk dönen çarkıfeleğin peşinden erken gelir ecel
Canımızı alır bir gün bu siyah ejderha biz bu azap içindeyken

Bütün sadık âşıklar toplansa bir araya sanmam ki canını etsin feda
Olmaz kimse **Mela** gibi, çünkü gönülden canını vermiş o bu yolda

## 68

Bilmem haberi var mı güzeller şahı sevgilinin bundan
Kalplere vakıftır el-hak, hâlimizden de haberdar mıdır acep?

Dağlanmış gönülden, kaş ve zülüflerin gamzesinden haberdardır
Siyah renkli yeng oklarıdır saplanan kalbin ta derinliklerine



Gezmeyên wan sad û nûnan ra[d]iken ew qetl û xwûnan
A[w]irên eswed'uyûnan min diye û dil şehde ye

Lazim e l'sultan û mîran pirskirin li halê esîran
Em kirîn amancê tîran suxteyek dermende ye

Hêj nizam mîran di bîr in zani[t] em sî sal esîr in?
Çaverê pirsek emîr in lew bi rehm û şefqe ye

Pir dibêm şefqe li bal e 'arif û sahibcemal e
Carinan lê bên xiyal e pirs biket çi tê heye

Şefqe ket car car nihînî tûleyê asitan vexwûnî
Da vekem daxan bibînî nar û pêt û şu'le ye

Da bizanit pêt û nar im kuştiyê cotê xumar im
Muhbetê sotim buwar im lazim ew zanit we ye

'Alim e bi derd û birînê ma dema dîdar û dînê
Xef dibit remza evînê vê bizan bêşubhe ye

Her dema dilber diyar bit can û dil têk tarûmar bit
Dê çi reng muhbet sitar bit xefkirin bêfeyde ye

Her dema mehbûb zuhûr bit zêde mezher bêqusûr bit
Dê tecellayek [li] Tûr bit berqê lami' cezbe ye

Cezbeyê dil ez wucûd bir xef ji ber 'eynê hesûd bir
Min bi mihrabê sucûd bir lê Hecer nîşane ye

Secdeya ber "nûn" û "dal"an min tewafa zulf û xalan
Ew bes e j'sahibcemalan da neçî bê 'umre ye

Ê yekî sadiq hebînî bêhicab ew dê bibînî[23]
'Işq e tuxraya evînî serxweşê bêbade ye

Lami'a wê husn û nûrê ger çi dê dil şibet Tûrê
Batin e nayê zuhûrê bêhicab û perde ye

'Arifên me'naşinas in ew bi sed sûret lîbas in
Xeyrê mehbûb wan nenasin xef ji wan zanî me ye

Ê li min yengî keşandî sed xedeng vê ra reşandî
Dil ji derbê herişandî ez kirî extirme ye

23 Li vir di vê nusxeyê de beytek kêm hatiye.



"Sâd" ve "nûn" harfine benzeyen gözlerle kaşlardan atılan oklar
Kışkırtmada fitneyi durmadan katletmekte, gönül de şahittir buna

Esirlerin hâlini sormak sultan ve mirlere vaciptir elbet
Biz aciz âşıkları oklarına hedef kılanlar onlardır çünkü

Bilmem haberi var mı aşk sultanının otuz yıllık esaretimizden?
Bir kez hâlimizi sorsun diye bekliyoruz o merhametli sultanımızı

Şefkati bol, marifet ve cemal sahibidir sevgili
Ne olur arada bir hayaline gelsek hatırlayıp sorsa hâlimizi

Acıyıp seslense eşiğinde bekleyen köpeğe, yanına çağırsa da
Aşk ateşiyle tutuşup kor olmuş yaralarımı ah göstersem ona bir bir

Anlasın kor alevlere döndüğümü, mahmur gözlerin maktulü olduğumu
Aşkı yaktı beni küle çevirdi bunu da böyle bilmeli yâr

Anlar elbet sevgili görünce bunca dert ve yaralarımı
İnan bana gizli kalmaz aşkın remizleri, bunu böyle bil

Çıkıp gelince o dilber, can ve gönül tamamen tarumar olur
Artık gizli kalmaz bu aşk, onu gizlemeye çalışmak beyhude olur

Kusursuz şekilde göründükçe her defasında sevgili
Tecelli eder Tur-ı Sina'da, cezbeye gelir o parlak şimşek

Kaplamış varlığı gönül cezbesi, hasedçilerin gözünden uzakta
Hacerü'l-Esved'e yönelip secdeye kapandım kaşlarının mihrabında

Secdeye kapandım kaşlar önünde, tavaf için zülüflerle benleri
Umredir ziyaret etmek onları, kâfidir güzeller için bu kadarı

Sıdk ile sevgiliye bağlanan, ansızın perdesiz görür onu
Sevginin tuğrası aşktır, içmeden sarhoş eder âşığı

O güzellikle nurun parıltısı Tur'daki tecelli gibi dolar gönüllere
Perde ve hicapsız zuhura gelmez, batını bir tecellidir bu

Yüzlerce perde altında gizli olsa da manaya aşinadır arif olanlar
Sevgiliden gayrı kimse bilmezken bu sırrı aldık onlardan gizlice

Yengî yaylardan yüzlerce ok fırlatan sevgili
Darbelerle parçalayıp gönlümü, yanan bir çıraya çevirdi beni



Lazim ew zanît bi halî dilber û yarê mewalî
Gezmeyên qewsê hilalî derb li nêva sîne ye

Hêj dibêm mehbûb nizanî min ew e rûh û giyanî
Pirs nekir bîra xwe nanî ev çira perkende ye

Pirs nekir şahê cehanê Yûsufê dewrê zemanî
Ev çi xak e l'asitanê belkî êxsîrek me ye

Lew bûme xak ez ji rê ve, da dema yar tê ji wê ve
Damenê bigrim pê pê ve çendekî min cehde ye

Hindekî taqet didêrim bim xubar bedrê veşêrim
Ger ji çavan ez biwêrim min zenexdan telbe ye

Da binoşim mey ji lêvê mawera reyhan û sêvê
Lûlûwên şekker di nêvê abê heywan çeşme ye

Çeşmeya ava hayatê şerbeta qend û nebatê
Min li daxan ew mufa tê can ji bo şukrane ye

Lew weku sewda û dîn im her dema [dêmê] dibînim
Dîn dibim heyran dimînim Muşterî ya Zuhre ye

Şems di nêv burca şeref da sed kewakib çar teref da
Muşterî hatî bi ref da istîwa çû quble ye

Afitaba di istiwayê ez ji ber derb û cefayê
Canfida tême lîqayê şubhetê perwane ye

Min tu wî meqsûd ji dînê lew ji ber mewca evînê
Qest dikem dîdar û dînê mezher e lebs zêde ye

Rohniya çavêt nebînan murşidê meczûb û dînan
Daruyê derd û birînan min teleb dîna te ye

Pêti te nazik mubarek bîne ser çavêt me carek
Min curûh xweş bin bi carek rohin bin pê dîde ye

Pên kefa nazik ji nûrê tilliyên cama tehûrê
Lê ji mawerd û buxûrê min ziyaret tewqe ye

Da li ser çavan bimalim bulbulê werdên bi xal im
Carekê rehmê ke zalim şefqe xwo heqqê we ye

Er nekî rehmê tu mîro dê çi bit halê me îro
Qet ne carek bê esîro girtiyê sî sal heye



Bizi seven dilberin hâlimizden haberdar olması gerek elbet
Hilal kaşlarından atılan oklar darbeler halinde eder kalbe isabet

Sanırım hâlâ inanmaz sevgili, onun ruhum canım olduğuna
Hatırlayıp bakmaz mı neden bu kadar dağınık olduğuma

Sormadı beni hiç o cihan padişahı, o zamanın Yusuf'u
"Eşiğimizdeki bu toz toprak nedir, aceb olmasın bir kölemiz"

Toprak gibi serilip kaldım eşiğinde ta ki öteden yâr geldiğinde
Tutayım eteğini arkasından gücüm takatim elverdiğince

Gücüm yettiğince kül olup gizleyeyim o Ay'ın yüzünü
Cesaret alabilsem gözlerinden visaline talip olurum onun

Mey içeyim dudaklarından, yanak ve zülüflerin gülsuyundan
Bembeyaz inciler var abıhayat çeşmesi olan ağzında

Abıhayat çeşmesidir, şeker ve kand şerbetidir aslında
Şifâdır bunlar yaralarıma, feda olsun bu can onun yolunda

Sergeşte ve divane olurum her gördüğümde o yüzü
Divane ve mecnunu olurum o Müşteri ve Zühre güzelinin

Güneş şeref burcunda ve yüzlerce yıldız var etrafında
Ardından gelen Müşteri ulaşınca istivaya, kıble oldu âşıklara

İstivaya erdi Güneş bunca eza ve cefadan sonra
Pervane misali, canımı feda etmeye hazırım ona

Sensin hayattaki maksadım, aşkın dalgalanması senden ötürü
Seni yüzlerce kez görmek isterim deryanın her dalgasında

Aydınlığısın görmeyen gözlerin, mürşidisin meczubların
Dermanısın dert ve yaraların, arzum görebilmektir seni

Gel de o narin ve mübarek ayaklarınla gözlerime bas
Ta ki iyileşsin yaralarım, görüversin görmeyen gözlerim

Getir o nurlu nazik elini, şarab-ı tahur kadehini tutan
O gülsuyu ve buhur kokan parmaklarını, ziyaret edip öpeyim

Gözlerime süreyim parmaklarını, bülbülü olayım o benli güllerin
Bir kez olsun acı bana ey zalim, şefkatli olmaktır hakkın senin

Merhamet etmezsen sultanım ne olur bugün halim benim
Otuz yıldan beri bir gün olsun demedin bana; "ey esirim benim"



Şûn-cihê peykan û neslê ji tilliyên yaqût û feslê
Er nekî derman bi weslê ji her ku tên tîr gezme ye

Gezmeyên yarê pençe bavê ne j'mey û qend û gulavê
Bêt dewa ket me di gavê ma heyatek lê heye

Ne tinê qend û nebat î mezherê rûh û heyatê
Hem but î hem 'Uzza û Lat î lew me dil butxane ye

Xaneyê Latê Azer î tu bê çi şîrîndilber î tu
Her tu hur û hem perî tu bêxilaf ew Ke'be ye

Ma dibit bêheq xilafê murwetê ma vê nisafê
Ez belê bême tewafê min bi eswed secde ye

Da ziyaret kim nîşanê pir Zuhel bêtin qiranê
Tûle yim ser l'asitanê çavnêra mûçe ye

Bênîşan în da nîşan key Mah û Xurşîdê qiran key
Bende kelbê asitan key dûr nekî xweştûle ye

Ma bi zehrê şekkerînî mûçe dey hem xef bixwûnî
Da reqîbê mel'ûn nebînî pir 'eleyhille'ne ye

Guh bide pir gil û dadan hakimê şehr û bîladan
Dê tu daxwaz û muradan dey kesê bêçare ye

Ger nebexşî dil muradê ji wê heyat û xemr û badê
Dê bikem gilleh û dadê dad me dîsa ber te ye

Dê tu dîsa şefqetê key bi nîşana cebhetê key
Me j'herîmên [xizmetê] key mehremên bêperde ye

Da dema suhbet bi coş bî cam bi xwe ji le'lan bi noş bî
Me j'hebîb sed reng suroş bî dînber e pir 'işwe ye

Şerbeta wê cam û tasê yar ku dê bit ini'kasê
Bêt me jî feyzek ji kasê ava heywan bi xwe ye

Ê ji vî zerfî vexwarî xwend ev xettê xubarî
Mestiya çavêt xumarî qenc bizan ew zêde ye

Min li dil tîrek Moxil dî têk ji ber xwûnê qizil dî
Lê dibêm tîra ku dil dî ew ji çavên şehle ye

Rohniya çavên **Mela** yî Xaliqe husna te dayî
Hub tinê da min gedayî husn û hub yek çeşne ye

Dîtina nûra bi heq me sed neseq lew tên sebeq me
Pir nebî erzan di heq me lê **Mela** xweş bende ye



Yakut ve mercan gibi parmaklarınla ok yaralarının izini
Vuslatınla tedavi etmezsen ne olur halimiz ey peri

Mey, şeker kamışı ve gülsuyundan gelmiyorsa sevgilinin okları
Gelip de sarsa yaralarımızı, şifâ bulup iyileşir mi hiç o anda

Şeker tatlısı değilsin sadece, hayat ve ruh sende tecelli etmekte
Hem put, hem Uzza ve Lat'sın, onun için gönlümüz puthanedir

Azer'in tapındığı puthanesin, hem ne tatlı bir dilbersin
Sen hem huri hem perisin, mekânın benim için Kabe'dir

Tartışmaya gerek yok insafın gereği şudur
Tavafa izin verirse sevgili, Esved'i öpmektir niyetim

Ziyaret etmeliyim yârin benlerini, Zühal Güneş'e yakınlaşmadan
Sevgilinin eşiğinde azık bekleyen bir köpek gibiyim

Nişanımız yok, nişan kıl bize, yaklaştır Ay ile Güneş'i üstümüze
Köpek kıl bizi eşiğine, uzaklaştırma dergâhından bir kere

Şekere katıp zehrini onu sunup gizlice çağırmayacak mısın bizi
Ta ki görmesin bizi o lanetli rakip böylece

Ey beldelerin hakimi kulak ver şikâyet ve yakınmalarıma
Çaresizlerin talep ve isteklerini yerine getirmelisin daima

Gönlümün muradı ve hayatımın sebebi olan badeyi bahşetmesen bana
Sızlanıp şikâyet ederim çünkü şikâyet makamım yine sensin

Alnındaki benin hatırına sen yine şefkat et bize ey sevgili
Hizmetçi kıl bizi haremine, perde yok çünkü mahremlere

Sohbet coşup taşınca, kadehler al dudaklara varınca
Yüzlerce melek rengine alsa da yâr, dinden eden bir işvekârdır o

Sûreti görünür bize sevgilinin şarap kadehinde
Bize de ulaşır ol kaseden mahz-ı hayat olan feyizleri

Okumuştur hatt-ı gubarı bu kadehten içenler
Çarçabuk şifa bulup iyileşir hasta gözler

Kızıl kanlara bulanmış bir Moğol oku saplanmış kalbime
Lakin derim, kalbe saplanan ok, hep o şehla gözlerden gelir

Ey **Mela**'nın gözlerinin aydınlığı, seni güzel yaratan Halik
Sadece bu fakire verdi sevgiyi, çünkü birdir sevgiyle güzelliğin kaynağı

O göz alan nuru görünce yüz türlü nağme dökülür dilimizden
Satın alma bizi ucuz bir fiyata, çünkü iyi bir hizmetçidir **Mela**



# 69

Turreya tabidari ‘enber ke
Xemriyên şeng miski ezfer ke

Le‘lê ji misk û ‘enberê bireşîn
Ji gulavê cinesriyan ter ke

Kesk û sor in ji rengê qewsûqezeh
Ji serapa gulav û ‘enber ke

Surmepoşên surê bi ser kil de
‘Aqilan pê xirab û ebter ke

Her seher destekî ji nû wergir
‘Er‘erê têkda seraber ke

Qedd û qama şirîn û nazik û ter
Lê seraser bifessilîn ker ke

Nêrgizên sergiran hilîn carek
Du qiranan lêk beraber ke

Bimeşe kok bi ser derê qesrê
Bi xwe kokê li şah û qeyser ke

Were wek roj bi ser derê kelhê
‘Alemê têkda munewwer ke

Wek gula zer ji bo serwa te mîrim
Me bi qurban wek [gula] zer ke

Wek gulek zer di bexçeya te me ez
Tu me têkil xwe wek gula zer ke

Were carek eger tu lutfê key[24]
Me bi qurban yek du xençe ke

Zahidê hişk-teb‘ê sewdayê
Bi du caman tebî‘etê ter ke

Veke carek bi xende şekkerê teng
Têk misra me qend û şekker ke

---

24 Ev malik di gelek nusxeyan de nîne.



## 69

Amber sür kıvrım kıvrım kâküllerine
Misk gibi hoş kokular sür zülüflerine

Misk ve amber serp lal dudaklarına
Gül suyuyla ıslat yaban güllerini

Gökkuşağı gibi yeşil ve kırmızıdır renkleri
Gülsuyu ve amber serp üstlerine baştan aşağı

Sürme çek doğuştan sürmeli fettan gözlerine
Perişan edip divane kıl akıl sahiplerini

Her seher yeni elbiseler giyin yeniden
Sarıp sarmalasın selvi boyunu baştan aşağı

O taptaze, ince ve latif boyuna göre
Ölçüsünü alıp biçtir terziye ona göre

Bir kez olsun kaldır ağır başlı nergislerini
Yaklaştırıp beraber kıl öldürücü kaşlarını

Yürü saray kapısına, tam tekmil giydiklerinle
Şahlara ve kayserlere karşı iftihar et kendinle

Kalenin kapısına gel bir Güneş gibi
Nurlandırıp aydınlat âlemin her yanını

Sarı çiçek gibi olan sultanımın selvi boyuna
Bizi kurban kıl sararmış çiçek gibi

Sarı bir çiçek gibiyim şimdi bahçende
Sarı bir çiçek gibi kat bizi de meclisine

Lütfedip eğer bir kez olsun gelirsen
Gel bizi bir iki goncaya kurban kıl

Aşkta aklı kıt olur katı ve sert tabiatlı zahidin
Bir iki kadeh sun da yumuşatıver onun tabiatını

Bir kez gülerek açıver şeker tatlısı gonca ağzını
Baştan başa kand u şeker kıl şiirimizi



Xett û xalan nîşani **Nîşanî** de
Me ji navê xwe ra bi defter ke

Pê li ser dîdeyên **Melê** dayîn
Xelweya sofiyan munewwer ke

## 70

Gerçi bulbul cewhera zatê gul e
Lê gulê rewneq ji ‘işqa bulbul e

Guh de zikrê hal û coşa badeyê
Wê bi bulbul ra dixwûnit bilbil e

Sosinan sed reng avêtin kemend
Wan digo dil bendê tayek sunbul e

Sunbulan seywan li dêmê taze kir
Afitab îro di burca sunbul e

Qet ber yekî vê demê hazir biket
Qisseya fesîl ne karê sunbul e

‘Er‘era rengîn ji tayên sor û zer
Qumriyan sed rengê şîrîn xulxul e

Zimzima ‘işqê ji bala hate xwar
Qudsiyan avête çerxê xulxul e

Min ji dil nasûrekî ra hestiyan
La cerem ev neş’eya daxa kul e

Bulbul û perwaneyê fesl û dem in
Cinsê ‘işqa min tinê derdê kul e

Nêrgiza nazikqed û şehla ye mest
Dîn kirim ez bulbulan sewda gul e

Teb‘ê lami‘weş ji minnet Bûlhesen
Min di dest da Zulfiqar û Duldul e

Eşqerê bedfi‘l hebbi kir ‘eceb
Barekellah xweş bezî hespê qul e

Zulf û biskan pir ji min dil bir **Mela**
Rişteya canê **Melê** ew kagul e



Yanağındaki benlerle ayva tüylerini göster **Nişanî**'ye
İsminle birlikte bizi de yaz sevdanın defterine

**Mela**'nın gözlerine basıp da ayaklarınla
Nurlandır sufilerin halvetgahını

## 70

Gerçi bülbül bizzat gülün cevheridir
Lakin güle parlaklık veren bülbülün aşkıdır

Kulak ver badenin kaynayıp coşma zikrine
Bülbül sesiyle dökülür mey testiden

Zambaklar yüz türlü tuzak kurmuş âşıklara
Derdi onlar, gönlün bir tek sünbüle bağlı olduğunu

Sayeban olmuş sünbüller sevgilinin güzel yüzüne
Güneş sünbül burcundadır bugün yine

Başka bir yol var mı şimdi kurtuluş için
Kemendi çözmek sümbülün işi değildir elbette

Süslenmiş selvi boylular sarı kırmızı renklerle
Kumrular ötmede yüz çeşit tatlı nağmelerle

Gökten yere inmiş aşkın nağmeleri
Doldurmuş gök kubeyi kuddusilerin sesleri

Kemiklere kadar işleyen bir nasır var gönlümde
Dağlanmış bir yaranın izidir bu bence

Bir mevsim sürer bülbül ile pervanenin aşkları
Acısı kuşatıcı olan benim aşkımdır sadece

Nergis gibi nazenin boylu ve mest eden şehla bakışlı sevgili
Mecnuna çevirdi beni, bülbülün güle olan aşkı gibi

Ebu Hasan'dan armağandır bana bu şimşek gibi beyanım
Altımda Düldül, elimde Zülfikâr var çünkü benim

Huysuz at nasıl eğitilir acep böyle
Maşallah dört nala koşan ata böyle

Ey **Mela**! Alıp götürdü gönlümü o zülüflerle kâküller
**Mela**'nın ruhunun bağlandığı iplik işte bu kâküllerdir



## 71

Feleka e[t]les sergeşte di cama me hubab e
Mewceya qulzemê ‘işqê me li serdestê xurab e

Dil kemerbesteyê ‘işq e bixwe zunnariperest im
Mey û me‘şûq e du‘a me û me seccade qubab e

Ji hicabê were der nazik û mestane bimeş tu
Tu cehan zîr û zeber ke bi Xudê ev [çi] hicab e

Destê Cibrîli hilavêti ji bejna te niqabê
Bi yeqîn Qaf e li Rojî û we rêhtîne niqab e

Me bi îşraqê sualek ji lebê xunçe guşa kir
Go bi îlhamê me zanî di suala te cewab e

Tu binê sazê bi awazi çirengî te dixwûnit
Ellah Ellah bi Xudê qet nebihî ev çi xitab e

Guh de nayê ji lebê le‘lî bi qanûnê hikayet
Dê çi şehde bide vî ra çi didet şehde rebab e

Te divêtin şist û şowa çehreyê dil key[25]
Me tehurê ateş seyyale û cama meyê nab e

Xweş perîşansifet û mecme‘ê sûretê hal în
Pîrê ‘işq în û cuwanteb‘ û li dil ‘ehdê şebab e

Dûredest în ji cenabî me divê yek ji Xudê ra
Xef di behsa me ji dil bêt û biret ‘eynê sewab e

Me muşerref ke du çavên me bisata qedeman ke
Pir li nik min heye mey binêre ku min sîne kebab e

Kesk û soran tu binê çerxê li dora du hilalan
Du qiran mane beraber şefeqa perde ‘îsab e

‘Er‘er in ta di şepal in wereqan cezbe ye vê ra
Nêrgizan ser di giran in li binefşan xem û tab e

Çîçekên qewsêqezehreng hezar reng sema ye
Sunbulan girtî xunav e li gulan taze gulab e

Mest û hişyar heme keckuleh in reqs û sema tên
Ez nizanim çi neseq keyf e nizanim çi şerab e

---

25 Ev beyt tenê di vê nusxeyê de heye.



## 71

Biteviye dönen felek-i atlas bir kabarcıktır gönül kadehinde
Aşkımızın dalgalı denizi, galebe etmede bindiğimiz sandala

Aşkın kemerini sarmıştır gönül, bense zünnarperestim
Mey ve maşuktur arzumuz, üstümüzde bir perdedir seccade

Büründüğün örtüden çık da salınıp gel mestane yürü
Yıkıp alt üst ettin cihanı, nedir bu örtü Allah aşkına

Kaldırıp attı örtüyü üstünden Cebrail kendi eliyle
Kaf dağı nasıl örttüyse Güneş'i, perde öyle örtmüş yüzünü

İşrak yöntemiyle halimizi sorduk gonca ağızlı sevgiliden,
İlham yoluyla dedi: Bildik ki sualin içredir cevabımız

Gel de bak müzik aletlerine nasılda davet ederler seni
Allah Allah, duyuyor musun nasıl bir hitaptır bu

Dinle neyden bak lal dudaklardan kanun ile neler anlatır
Dil ile ikrara ne hacet buna şahit bizzat rebaptır

Gönül aynamızı yıkayıp paslardan temizlemek istersen
Onu ateş-i seyyal ve halis şarapla yıkamanı isteriz

Dağınık ve perişan hâllerim toplamıyız
Aşkın pîriyiz, gönlümüzse genç ve delikanlı yaştadır

Sevgiliye hâlimizi iletmekten uzağız, dileriz Allah için
Biri iletsin bunu gönülden ona, pek büyük sevap var bu yolda

Huzuruna kabul edip şereflendir bizi, yoluna ser iki gözümüzü
Yeterince şarap vardır yanımda, bak kebap olmuş sinem de

Kırmızı ve yeşil halkalara bak hilal kaşların etrafında
Şafak aydınlığı gibi kalmış yüzünde, perdelemiş onu asabe

Selvi boylu sevgilinin takıları cezbeye gelmiş yapraklar gibi
Ağırlaşmış başı nergislerin, sarmaş-dolaş olmuş menekşelerle

Gökkuşağı renkli çiçekler bin türlü renk katmış semaya
Çiğ düşmüş sünbüllere, gülsuyu dökülmüş güller üstüne

Eğik külahlarıyla sarhoş ve uyanık raks ile semâ'a gelmişler
Ne tür bir keyiftir bu, ne tür bir şaraptır bilmiyorum



Xakê payên di rêza seg û tûlan xwe dinasîn
Me ne sûc û ne gunah e ne xeta ev çi ‘îtab e

Ji wîsala xwe zikatê bide miskîn û feqîran
Ku cemala te kamil e di kemala xwe nîsab e

‘Aşiqê mes’elexwahî were em muftiyê ‘işq în
Desteki sunnet e têda û yekî nessê kitab e

Dil bişo der ji vê nifaqê ku bidet sîne beraqê
Bi sefa hemrehê erbabê dilan we çi sefa be

Nezera ‘eynê ‘inayet bi me da şahê wilayet
Ji ‘inayet nezera dil me tejî ‘ilm û ‘ubab e

Lebê le‘lên te di bê herdu bi yek nuqteyê ‘ilm in
Li xetê herfê elîf cezme şibê helqeyê bab e

Xet û xalên te bi mû mû ji me ra mes’elegoy în
Me ji wan haşiyeyan sîne binî Şerhê Lubab e

Avê heywan te divê rastî binoşî şebê qedrê
Dest ber gerdenê pîr pêç û xeman zulfê bi ta be

Serkeşî şêweyê erbabê wefa nîne ruha min
Te ji dil sot **Mela** bes bi **Melê** ra bi cefa be

Te ji biskên xwe girehdarê di bextê me girê ne
Me ji zulfên bi xem û tabê di dil da xem û tab e

Te divê berq û birûskan bireşînî tu nezer de
Te divê roj xweya bî ji şibakê xwe xweya be

Te divê zêr û zeber key me, tu zulfan bide ber ba
Te divê qenc qiyamet li me rabit bi xwe rabe

Qesdê serçeşmeyê heywanê heqîqet ke **Mela**
Bi cehanê mebe mexrûr ku cehan ‘eynê serab e

## 72

Me lew fincan li ser dest e ku mehtab in hilalebrû
Numayin min di mir’atê meya saf û zelalebrû

Te şîrîn û zîbayî te reftarî yû balayî
Binê nûn in di tuxrayî li bala herdu xal ebrû



Bastığın toprağın kapısında saf tutmuş köpekleriz
Suçumuz, günahımız ve hatamız yok bizim, nedir bunca azar

Vuslatından zekât ver biz miskin ve fakirlere
Güzelliğin, kemalinde nisaba ermiştir çünkü

Ey âşık! Sorun varsa gel de bize sor, biziz aşkın müftüsü
Bir elimizde Sünnet diğerinde Kitap var çünkü

Yıkayıp temizle gönlü bu nifaktan ta ki parlasın sine
Safa bulmak istersen yoldaş ol gönül ve safa ehline

İnayetle bir kez nazar kıldı bize şah-ı velayet
İlim ve irfanla doldurdu gönül denizini ol nazar-ı inayet

Ba harfini andıran al dudaklar ilmin çıkış noktasıdır bil
Ondan uzanan elif harfinin cezmi de marifet kapısının halkasıdır

En ince konuları anlatır bize yanağındaki benlerin
O haşiyelerle doludur gönlümüz Şerh-i Lübâb misali

Gerçekten içmek istiyorsan abıhayatı kadir gecelerinde
Eğilip bükül iki zülfün önünde, pir-i aşkın boynuna sarıl iyice

Serkeşlik etmek, erbab-ı vefanın adeti değildir canım benim
Yaktın kalbini **Mela**'nın yeter çektirdin ona bunca cevr u cefa

Kâküllerindeki düğümlerle bağlanmış bizim bahtımız
Zülüflerindeki düğümlerdir gamla eleme dönüşen gönlümüzde

Yıldırımlar yağdırmak istersen bize bir kez nazar kıl yeter
Güneş'in çıkmasını istersen çıkıp görün bir kez pencereden

Tar u mar olmamızı istiyorsan eğer yele ver zülüflerini
Başımıza kıyamet kopsun istersen, bir kez kıyam et yeter

Abıhayat çeşmesine ulaşma hedefini gerçekleştir ey **Mela**!
Mağrur olma dünyaya ki, dünya tamamıyla bir seraptır

## 72

O hilal kaşlı, ay yüzlü güzel görünür bana daima
Saf ve berrak mey aynasında, ondandır düşmez elimden kadeh

Kaşlar üstüne tuğra gibi düşen zülüflere bak
Tatlı, güzel, asil hareketlerle latif şekiller alnında



Bila bit saimu'd-dehr û bila îftari carek bêt
Kes zanit ku ji dilber dê xweya bin her du sal ebrû

Meşî mestane reyhanî dilê min dî di amancê
Reşandî şîpeyek tîran bi qewsê her du mal ebrû

Sehergeh Mahsîmaya me çû gulşen bi seyranê
Li ser çavên **Nîşanî** da xiramê ew hilalebrû

Dibên xawerperest î tu nizanin min di keşfê da
Numayin min di şerqê nazika gerdenşemal ebrû

Tinê ma her terazû ne di babê husn û kêşayî
Hilalê xatema husn in li wê dêma bi xal ebrû

Me cewher 'unsurek xas e numa îro di tali' da
Di vê teqwîmê insanî li tali' bûn hilal ebrû

Ji zunnara di dêrê da li hindava çelîpayê
Bi mihrabê me bir secde belê emma xiyal ebrû

Ji mabeyna du ebrûyan dibînim qabê qewseynî
Didit min terfetil'eyni cewaba sed sual ebrû

Di batin secdegaha min ji secda herdu ebrû ne
Bi 'eynê taqê mihrab in di 'ilmê ehlê hal ebrû

Bi şîrînî bi zîbayî çi katib bû dikêşayî
Te'alallah nîşan dayî çi wî şîrîn mîsal ebrû

Eger de'wayê Mûsayî di 'işqê da bikem ca'iz[26]
**Melê** daîm tecella ye ji wê terha şelal ebrû

Nişana qabê qewseynî çi qews avête ebsaran
Di teqwîma tecellayî di selwê bûn misal ebrû

## 73

Di sipêde ez burcê qews ebrû numandin mahê new
Xweş xweş ji qewsa ebruwan yengî kişandin mahê new

Goşeyên du nûnan her bi ser badan ji qewsê bêweter
Teşbîhê enguştan binî sed ser perandin mahê new

---

26 Di nusxeyên dî de piştî vê beytê beytek dî jî dihat.



Bir kez olsun gelip iftar açsın sürekli oruç tutan ve
Her iki yılda bir kaşlarının zuhurundan haberdar olan âşık

Reyhan gibi salınarak yürüyen sevgilinin hedefi oldu gönlüm
Sağanak hâlinde ok yağdırdı sineme her iki yay kaşından

Ay yüzlü sevgili gül bahçesine seyrana gider seherde
Cilvelenir hilal kaşlar **Nişanî**'nin gözlerinde

Derler ki "sen Güneşperestsin" ama bilmezler keşifte;
Göründü bana mum gibi ince boyunlu sevgilinin hilal kaşları

Güzellik bâbında çizilen kaşlar terazinin iki kefesi değil sadece
Güzellik mührünün hilalidir yüzündeki benli kaşlar

Hâlis unsur göründü şansımıza bugün yaratılış cevherimizde
Talihimiz oldu bize bu hilal kaşlar ahsen-i takvimde

Zünnar bağlayıp kilisede salib hizasında
Mihrapta secdeye kapandık amma o kaşlar var hayalimizde

Kab-ı kavseyndir gördüğüm sevgilinin kaşları arasında
Yüz sorunun cevabını verir bana göz açıp kapamak arasında

Hakikatte secdeye kapandığım o iki kaştır secdegahım
Aynı tak-ı mihraptır kaşlar ilm-i hâl erbabınca

Hangi kâtip çekmiş ince kaşlarına bu kadar tatlı, güzel hatları
Fesübhanallah, gören yok şimdiye dek bu türden hilal kaşları

Musa'nın, Allah'ı görme isteğini caiz kılsam eğer aşk bahsinde
O zarif endamlının kaşlarından tecelli var üstümüzde ey **Mela**

Ey **Nişanî**! Kab-ı kavseynde gökkuşağı renkleri atılmış gözlere
O güzellik tecellisinde selvilere dönüşmüştü kaşlar

## 73

Seherde yay burcunda görünen kaşlar sanki yeni doğmuş Ay
Hızla çekti yay misali kaşlarından okları o yeni doğmuş Ay

Kaşlarını çatarak çevirmiş üstümüze kızgın bakışlarını
Parmaklar gibi yüzlerce baş koparmış yeni doğmuş Ay



Wê keşşifî bedra temam ehsen ji bala tel'etê
Wê ji istiwa da gezmeyan çerxê reşandin mahê new

Wê bi wechê afitabê gahi kifş û gahi xef
'Arifên sahib-bisaret heyyirandin mahê new

Mil dizanim dane ber qewsê hilalî qebze-zer
Lew ji bala goşeyên nûnan livandin mahê new

Ez dibêjim dê li min dîsa ceger sed pare ket
Wê li mîzanê herdu şîrazî çevandin mahê new

Daxilê meclisê **Mela** îşev **Nîşanî** bû ku xef
Camê rûhanî li ehlê dil nîşandin mahê new

## 74

Di des[t] da yengiyek nûbari min dî ew kemanebrû
Li bala cedwelek Cebbarî têda hemqiran ebrû

Ku Heq ev herf û xet kêşan li talayê me derwêşan
Du qewsan goşe lê badan li ser peyweste man ebrû

Te dîdarê te reftarê te elmas in şekerbarê
Bi 'eynî reh li ser sadan du nûn reyhan numan ebrû

Bi hemdillah bi feyrozî li wechê dilberê min dî
Ku mahê nû nîşan min dan ji tavê asîman ebrû

Te'alallah nîşan daye bi husnê ev neseq daye
Ji neqşê sen'etê Heq ev nîşançeşm ev nîşanebrû

Ji re'na nêrgizên şehla mecalê hemqeran bin ew em
Hezar remz û îşaret tên di nîvê bû çe[ş]man ebrû

**Melê** dil teng peykan in ji mehbûban me nîşan in
Kemendar in di xeddar in di burca esmeran ebrû

## 75

Her di ber qalûbelayê belku ev 'alem [n]ebû
Çerxê gerdan dewrê gerdûn gunbedê mîna [n]ebû

'Erş û kursî hêj di mexfî bûn di kenza qudretê
Husnê Heq bû di istiwayê lami'a 'işqê hebû



Ne güzel göründü dolunay yükseklerden ağarak üstümüze
Durmadan oklar fırlattı semanın kalbine yeni doğmuş Ay

Gah görünür gah gizlenir güneş yüzünde o kaşlar
Hayrete düşürdü basiret ehli arifleri yeni doğmuş Ay

Altın kabzalı hilal yayları dayamış omuzlarına
Titretmede nun kaşlarının uçlarını yeni doğmuş Ay

Sanırım yüz pareye bölecek yine ciğerimizi
Ölçülü germiş her iki Şirazî yayını yeni doğmuş Ay

Ey **Mela**! Gizlice dahil olmuş meclise bu gece **Nişanî**
Ruhani bir şarap kadehi gösterdi gönül ehline yeni doğmuş Ay

## 74

Keman kaşlının elinde Yeng mamulü yeni bir yay gördüm
Cetvelle çizilmiş sanki yüzünde, birbirine yakın duran kaşlar

Biz dervişlerin alnına çekmiş Hak Teala bu harflerle çizgileri
Köşeler verince her iki kavise orada kaldı daim kaşlar

Güzellik sende, işveli yürüyüş sende, elmas dişler, tatlı dil sende
Gözler üstünde reyhani hattan çekilmiş iki nundur kaşlar

Şükür Allah'a ki, sevgilinin yüzünde mutlulukla gördüm
Yeni doğmuş ayı, gösterdiler bana tab-ı asumanda kaşlar

Fesübhanallah, gören var mı böyle bir güzelliği
Allahım, görülmüş mü hiç gözler üstünde böyle kaşlar

O güzel, baygın bakışlı sevgiliyi görünce yakından
Bin türlü remizler yayar gözler üstündeki keman kaşlar

Ey **Mela**! Atılan oklarla doludur gönül, mahbubların nişanından
Merhametsizce yay tutar esmer güzellerin yüzünde kaşlar

## 75

Belki bu âlem kalû-belâ öncesine kadar yoktu henüz
Zaman çarhı, dönen felek ve mavi gökkubbe yoktu henüz

Arş ve kürsi kudretin hazinesinde gizli iken henüz
Kemalde iken cemalullah, mevcud idi aşkın nuru



Nehtibûn hukmê sifatan ew ji zatê lem yezel
'Aşiq û me'şûq yek bûn şem' û hem perwane bû

Husn û hub zatekê qedîm in lê cuda bûn ew ji yek
Lê niha ismê hudûsê lê hukum tefsîle bû

Yek di zatê surşîrînan bû cemal û husn û sur
Yek di qelbê ehlê dil nar û cela lew cezbe bû

'Aşiq û me'şûq elheq herdu mir'atên yek in
Lew di 'eynê cem'ê da eslê qedîm ayîne bû

Hubb û husn anîn zuhûrê 'işq e eslê 'alemê[27]
Eslê eşya da bizanî wan çi esl û madde bû

Cezbe û seyra sulûkê bêmehebbet nabitin
Cehdeya bê'işq û hub çendî ku kir bêfeyde bû

Salikên 'işqê yeka yek hewce nînin ez bibêm
Cameya pîrê terîqê ser ji nik şehzade bû

Reng reng ehlê meqamatê terîqê çûye seyr
Hin celal û hin cemalê sermeyan ev bade bû

Ê bûyî 'eynê beqayê badenoşê 'işqê bû
Ê bûyî mehwê fenayê 'aşiqê bêçare bû

Êk ji wan perwane bû sot û fixanek jê nehat
Êk ji wan teşbîhê goyînê bi ah û nale bû

A[w]irên eswed'uyûnan 'aqilan sewda diken
Gezmeya 'aşiq vi dil keftî ji çavên şehle bû

'Aşiq û me'şûq da wasil bi yek bin bêhicab
Mehwi bû bi'zzati 'aşiq lew di 'işqê perde bû

Lew di 'işqê da fena bû da bibit baqî bi dost
'Aşiqê baqî nebû wasil hetta fanî nebû

Nuqteyê 'ilm û sewadê herf û neqşê 'alemê
Ser didin me'nayekê eslê sewadê nuqte bû

Her yek e û dê yek bimînit ewwel û axir yek e
La cerem nabin du bin ê dê bimînit her hebû

Her çi de'wayê di 'işqê da **Melê** sabit kirî
'Eynê de'wayê di nefsil'emri dîsa şehde bû

---

27 Ev beyt di nusxeyên dî de nîne.



Bilinmez iken zat-ı lemyezelin sıfatları henüz
Âşık ile maşuk, hem pervane ile mum var idi

Ezelde bir iken güzellik ile sevgi, ayrı düştüler birbirinden
Hudus ismini aldılar daha sonra, hükmün takdiri böyle idi

Cazibeli güzellere cemal ve hüsün oldu bunlardan biri
Yakıcı bir ateş ve cezbe olup düştü gönül ehlinin kalbine diğeri

Birbirinin aynasıdır âşık ile maşuk elhak
Çünkü ezelde aynı oldukları gibi, asılları bir tek ayna idi

Sevgi ve güzelliği yarattı, çünkü aşktır âlemin aslı ve özü
Varlığın aslını bilip anlayasın, nedir maddenin aslı ve özü

Muhabbet olmadan gerçekleşmez ne bir cezbe ne seyrisülûk
Aşk ve sevgisiz bir cezbe fayda vermez ne kadar çaba sarfedilse de

Bir bir saymam gerekmez aşk yolunda gidenlerin vasıflarını
Tarikat şeyhinin müride giydirmek istediği kaftan şehzadenin idi

Sevgiliye ulaşmak için tarikat ehli türlü yollarda seyretmişler
Kimi celâl, kimi cemal yolunu seçse de sermayeleri aynı badedir

Ebedilik makamına erişti aşk şarabından içen kişi
Fena makamında mahvolan kimse de âşık-ı biçare idi

Saliklerden biri pervaneydi, aşka yandıysa da feryadı çıkmadı
Diğeri ise bir (goyîn) dağkuşu gibi ahlarla iniltiler içre idi

O keskin bakışlı siyah gözler mecnun eder akıl sahiplerini
Kalbi hedef kılıp oklar fırlatan bizzat o şehla gözler idi

Âşık ile maşuk vuslata ersin diye birbiriyle perdesiz
Mahvedip kaldırdı özünü, çünkü âşığın varlığı en büyük engel idi

Aşk yolunda fani oldu ta ki sevgiliyle beka bulsun
Baki âşık vuslata eremedi tâ ki fani olmadıkça

İlim ve kitabetin bütün şekilleriyle varlığın çıkış noktası
Sonuçta bir tek noktaya varır, çünkü odur hepsinin aslı

Her daim birdir o elbette bir kalır evvel ve ahir
İmkansızdır ona ikilik, ezelde var olan yine baki kalır

**Mela**'nın ispat ettiği her bir dava aşk bahsinde
Aslında şahid-i sadıktır herbiri yek diğerine



## 76

Min dî seher şahê Mecer lebsê di ber mexmûri bû
Ew dêmzerî surmuşterî ya reb perî ya hûri bû

Horîweş e kagulreş e dêmqerqeş e xalhebeş e
Xalên di qer miskê Teter nazikbeşer kafûri bû

Nazikletîf gerdenxefîf lebsê şerîf kêmxe'w qedîf
Min dî bi wext îro li text ew nîkibext fexfûri bû

Fexfûrsur e sîmadur e heybetpur e pur dilgir e
Ew hate meş min çûne hiş dil lew ji ‘işqi fûri bû

Dil bû kerî zaya berî lazim herî dê ew zerî
Min dî gelek ew surmelek wek meş‘elek purnûri bû

Dêmfener e xal‘enber e bomawer e lebşeker e
Ew meyperest meşha û mest cama di dest ferfûri bû

Mey ber kefê pir ji qerqefê li dengê defê meşha sefê
Husna li dêm wesfan neşêm, her çi bibêm jê dûri bû

Da min suroş wer mey binoş zewq û xuroş lew çûm ji hoş
Ji ‘işqa yar bi xweya ew ne ji meya engûri bû

Min dî bi xwab ew mahitab da dil kulab cotê xurab
Dil şewwişand xw[êy] lê reşand qenc herrişand têk hûri bû

Hûr kir cesed qewsê Semed tîr dan kebed dad û meded
Cerhan ji new xwûn daye kew ‘işqa me lew meşhûri bû

Lew yek neseq min tên sebeq nûra teqeq da dil şefeq
Ji ber xebxebê wê kewkebê lê bende bêdustûri bû

Mîran nezer da min seher xeclîm ji ber lê ew qeder
Zanim ku ew nûra li rû wek lu'luwa mensûri bû

Paş firqetê ji mihnetê ji zulmetê çûm hizretê
Wesla hebîb min bû nesîb mel‘ûn reqîb mehcûri bû

Cama zelal xemra helal, yara şepal da min bi hal
‘Işqa xedar sotin sitar nêv me û yar sed pûri bû

Pur min zecir têtin hecir lê bû ecir subh û fecir
Şem‘a me hilbû sed ‘emil minnet me dil mesrûri bû

Îhram me best eswed bû qest yar hat û mest fincan di dest
Cotê hebeş tîr dan bi weş hecca me xweş mebrûri bû



## 76

Macar şahını gördüm seher vaktinde, gül renkli giysiler içinde mahmur
O sarışın, o Müşteri huylu güzel, peri yoksa huri midir ya Rab

Huru misal siyah kâküllü ay yüzlü ve kara benlidir o sevgili
Tatar miski kokar benleri, kâfur beyazı, narin tenlidir o sevgili

Nazik, hoş ve zarif gerdanlı, paha biçilmez kadife giysiler içinde
Gördüm münasip vakitte o güzel talihliyi, oturmuş tahtı üzerinde

O inci yüzlü, Çin sultanı, o haşmetli, gönülçelen sevgili
O salınıp gelince gitti akl u şuur; ondandır aşk ile taştı gönül

Ayrılmak isteyince o sarışın güzel, parçalandı gönül
Meş'ale gibi etrafa nurlar saçan o periyi çok kere gördüm

Yüzü ay, benleri amber, gülsuyu kokuludur şeker dudakları
İşveyle salınıp giden o meyperestin fağfurdandır kadehi

Çoğu karkaftan mey kadehleri ve def sesiyle âşıklar halkasına katıldı
Vasfedemem o sevgilinin güzelliğini, ne desem çok uzak kalır ona

İlham edince Cibril gel iç diye zevk ve safa bırakmadı bende şuur
Yârin aşkındandır sarhoşluğumuz, yoksa üzüm suyundan değil

Rüyada görünce o ay yüzlüyü, parçaladı gönlü bakışlarıyla
Yakıp tutuşturdu kalbimizi, tuza banıp iyice parçalayıp ufaladı

Yaraladı gönlümü o samedi kaşlar sapladı okları ciğerime, imdat
Kanadı yaralarımız yeniden, ondandır şöhret buldu aşkımız

Gönlü parlatan ilahi nurdan art arda çıkmada aşk nağmeleri
Destursuzum yanında o narin gerdanlı, parlak yüzlü sevgilinin

Sultanlar nazar kıldı bana seherde lakin bakamadım utancımdan
Bilirim yüzündeki o nur, dizilmiş inciler gibiydi alnındaki perçemiyle

Bunca mihnet ve ayrılıkdan sonra zulmetten çıktım huzuruna
Nasip oldu vuslat bana lakin kıyametler kopardı melun rakip

Saf kadehte sundu bana o narin sevgili helal şarabı
Yâr ile aramızdaki surları yıkıp, yaktı perdeyi o yaman aşk

Çok acı çektim ayrılıktan, sabah aydınlığı oldu bunun mükâfatı
Yandı bahtımızın çerağı yüzlerce renkte, şükürler olsun mesrurdur gönül

İhram giyip niyetlendim Esved'e, yâr geldi mest, ellerinde kadehle
Ok yağdırdı üstüme siyah kaşlar, haccımız makbul oldu bereketle



Yar we‘de da bi le‘lên xwe da wer ba me da çîn perde da
Di spêdeyê çûm we‘deyê ku j’badeyê mexmûri bû

Şahê cevîn xem têk revîn şem‘a şevîn hilkir evîn
Derd û bela min bûn hela ‘umrek **Mela** mehcûri bû

Wê kagulê çînê dilê qelbê **Melê** dav dane lê
Dava dilan nêv sunbulan ser sorgulan menqûri bû

## 77

Kes nedî qet di sehergeh ku çi nazikweres î tu
Me ji gul û nêrgizên sermesti bes î tu

Zanim ne tinê bes yedê beyda tu didêrî
Wer xweş ke şehîdên xwe ku ‘Îsa-nefes î tu

Rûh î û ne cism î ji cemalê bi çi ism î
Reng reng [tibî] keşf û şuhûdê çi kes î tu

Roj î tu li şerqê bi cemala xwe we berqê
Billah ji serçeşmeyê eqdes qebes î tu

Bêje ji çi nûr î û tecella li çi Tûr î
Geh geh li seraperdeyê can multemes î tu

Şemsa felek î ya melek î hê jî nizanim
Horî û perî ya bi xwe Rûhilqudus î tu

Cana ceresa reh[be]rê ‘işqa te ez im qet
Ageh bi fixan û herekatê ceres î tu

Ma yek nefesek min dibitin bê te wucûdek
Dê bê te ku bim hem tu rûh î hem nefes î tu

‘Işqa te meger zêr e sifet zêr kirîn em
Iksîrê evîna me bi ‘eynê wemes î tu

Min go ji nigaran tu gul î belku we çêtir
Zanim bi muhib her ne ku xarî û xes î tu

Wê horîsiriştê li me xweş meywe bi ser kir
Cennat e wisala te wû ateşperes î tu

Min go di şevan şibit nucûman bi tewaf în
Kir ‘işwe dizanin bi çi qest û hewes î tu



Gel seninle halvet olalım, diye söz verdi bana sevgili tatlı dudaklarıyla
Buluşmaya gittiğimde şafak vakti, aşk badesinden hâlâ mahmur idi

Toplandı meclis, dağıldı gam, yaktı aşk ateşini gecenin mumu
Kalmadı çektiğimiz onca dert ve bela, esaretle geçti ömrü **Mela**'nın

Birbirine dolanmış kâküller tuzak kurup esir almış gönlünü **Mela**'nın
Sünbüller arasında gizlenen gönül tuzakları, al güller üstünde kurulu idi

## 77

Görmemiştir hiçkimse nazenin endamını seher vaktinde
Gül ve nergise bedel mest olmamız için sen yetersin bize

Bilirim, sadece yed-i beyza değildir sahip olduğun mucizeler
Gel de dirilt yolunda şehid düşmüş olanları İsa nefesinle

Cisim değil, ruhsun sen, bilmem ki nasıl tarif etsem güzelliğini
Bin bir renkte görünürsün, hayrette bırakırsın herkesi, nesin sen

Cemalinle göz alan bir şimşek, doğan bir Güneş'sin doğudan
Yeminler olsun ki, mukaddes nurlu bir kaynağın serçeşmesisin

Söyle hangi nurdansın, hangi Tur tecellisi var sende
Çünkü iltimaslı bir yerin var senin canlar canının otağında

Güneşi misin gökyüzünün, melek misin yoksa, anlamış değilim
Huri mi, peri mi, yoksa bizzat ruhu'l-kudüs müsün sen

Aşk yolunda yürüyen kervanın kılavuzu ve çıngırağı benim
Bilmem duymakta mısın çıngıraktan yükselen feryad ile figanı

Varlığın olmaksızın bir tek nefes alabilir miyim hiç?
Sensiz neyim ki, ruh veren sen, aldığım nefes sensin

Dedim: Meger senin aşkın altın imiş, sarartıp bizi altına çevirdi
Dedi: İksirdir aşkımız, temas edince altına çevirir bakırı

Dedim: Güzeller içinde bir gülsün; belki de gülden de öte
Dedi: Gerçek âşık değilsin asaletin de yok, bir dikensin sen

O huri tabiatlı güzel, hoş meyveler ikram etti bize
Vuslatın cennettir ama bir ateşperest gibi davrandın bize

Dedim: Gece boyunca dönüp durmaktayız yıldızlar gibi
Fakat o naz etti, biliriz nedir bununla gerçek niyetini



Min go me bi tîxan veneda ken ji derê te
Go em ji nebat în û li teb'ê meges î tu

Min go ji kemenda serê zulfa te verestim
Perwazê lebê le'l e me go ger veresî tu

Yek dem venehiştîn te di hamûnê firaqê
Bê hemdemê derdan ku çi feryadires î tu

Min go ji dilê şibhê nuxûr xweş te bi ker kir
Ker kir bi du le'lên xwe şeker go 'edes î tu

Min go li rexan în ku ne kecrew weku ferez în
Şeh go me yek in ma ne bi bazî feres î tu

Min go te divê ser ji reqîbî bibirim ez
Go min we ye zanim dibirî jê meqes î tu

Ta çendi bi xef bade binoşî we nefes da
Lêre bi def û ney were mîrê 'eses î tu

Min go ji qedîm em meyê 'işqa te dinoşîn
Go min ji 'uşşaqan ne tinê her tu bes î tu

Min go di şevan şibet şemalan disojîn ku
Perwanesifet sotî bêsewt û his î tu

Min go beser û quwwetê sem'a me tu yî go
Zanîn te em în rûh û mucerred qefes î tu

Te ji zulfê butan [bext] **Mela** reştir e tali'
Yarê te seher bêt û biret pê nehesî tu

## 78

Îro ji nû purateş im dîsan ji remza dilberê
Mecrûhê qewsê purweş im tîr dane nêva cegerê

Tîr dane qewsê eswed e şehzadeya şîrînqed e
Kuştîne wek min dehsed e wê padişah û beglerê

Wê beglerê pur kuştine enguşt bi xwûnê reştine
Ma ehlê dil qet hiştine sotîne mislê mecmerê

Lê ez tinê ser ta qedem yekser disojim dem be dem
Wesfên di 'işqê ez çi dem nayên hisab û defterê



Dedim: Kapından uzaklaştıramaz kimse bizi kılıçlarla
Dedi: Biz güzeller şekeriz, siz de tatlıya konan sineklersiniz

Dedim: Ey sevgili, düştüm zülüf uçlarının kemendinden
Dedi: Heyhat, ya al dudakların tuzağından nasıl kurtulacaksın?

Yalnız bırakmadın beni bir dem ayrılık sahrasında
Dertleşecek bir arkadaş yok iken yetiştin feryadıma

Dedim: Pare pare kıldın bizi, aşkının yolunda kurban gibi
Dedi: Tatlı bir dille; öğütülen mercimek tanesi misin yoksa

Dedim: Satranççtaki kaleyiz, at gibi işimiz yok eğri yollarda
Şah dedi: İkisi birdir bize, oyunda at gibi sağ-sol yapmadasın

Dedim: Ara bozucu rakibin başını kesmemi ister misin?
Dedi: Bilirim, görmüşüm, onu kesebilen bir makassın sen

Ne vakte kadar böyle gizli içeceksin badeyi nefes nefese
Ney ve tefle gel meclise mirim, bekçisi sensin bu gecenin

Dedim: Aşkının şarabından içmekteyiz ezelden beri
Dedi: Âşıklar içinde bana sen, yalnız sen yetersin

Dedim: Mumlar gibi yanmadayız geceleri senin aşkından
Dedi: Pervane gibi yandın; ses, söz ve histen azad oldun

Dedim: Seninle görür, seninle duyarım, dedi;
Bilirim, taşıdığın ruh biziz, sadece boş bir kafessin sen

Ey **Mela**! Bil ki, sevgilinin zülüflerinden daha karadır bahtın
Sevgili her seher vakti gelir gider ama sen farkında değilsin

## 78

Ateşler içreyim yine bugün o dilberin remizlerinden
Yaralıyım ciğerime saplanmış kaşlarının oklarından

Fırlattı okları siyah kaşlarından o tatlı endamlı yine
Öldürmüş benim gibi binlercesini o sultan ve melike

Sayısız âşık öldürmüş o prenses, kana bulamış ellerini
Talan edip yıkmış, bir buhurdan gibi yakmış gönül ehlini

Bense baştan aşağı yanmaktayım dem be dem
Nasıl anlatsam ki aşkın hesaba sığmaz niteliklerini



Wesfên evîn û ‘işqehê husn û cemala wê şehê
Nayête şerh û meddehê ehsen ji neqşê beşerê

Ehsen ji husna dêmdurê şîrînî û guft û surê
Sed zahid êxistin ji rê wê nazika lebşekerê

Şekker di nav lêvan e wê reyhan li dor sêvan e wê
Meş‘el di nêv şêvan e wê îsî ji rengê fenerê

Fenner niye nûra Heq e husn û cemala Mutleq e
Berq e sipêde’w şefeq e Zuhre û Şemsa xawerê

Zuhre û Şems û Muşterî min dîn li dêma enwerî
Zulfa muselsel ‘enberî ser daye hewza Kewserê

Hewza ji koşeyê çeşme tê baxçe û rewza qudretê
Her dem ji nû ve ser detê xemrî û tayên ‘er‘erê

Xemrî û reşbiska herîr werbûn li dor bedra munîr
Burca ku hakim lê du mîr min dîn li textê kişwerê

Textê du mîr û begleran meydan û coqa gogeran
Eslan û cotê meyxweran mey di şeraba saxerê

Saxer bi dest serxweş û mest weqtê sehergeh dest bi dest
Xeflet du begler meyperest kuştim bi derba xencerê

Kuştim bi derba keyberan gezme û xedenga a[w]iran
Remz û işarat û suran dan dil ji nêva pencerê

Dan dil ji ber husna bi nûr berqa tecellaya sudûr
Lew sotiyem wek kohê Tûr hubb û evîna enwerê

Hubba te ma xweş hiştime her roj ji nû ez kuştime
Yekser ji xwûnê riştime tîr û xedenga Qeccerê

Gezmên di şîrînnazikê derbên di wê rimbazikê
Çûyîne nêv dil gazekê min dad ji zulma dilberê

Dilber çi bêhed zalim e [çi] carek neket pirsê li me
Lazim bi halim ‘alim e lê pur didêrit xedderê

Lazim bi qetla min divî hêj dev di dil marê şevî
Peykan di cergan da çevî bend kir bi şewka ‘enberê

Bend kir kulab û penceyan dil ma di nêv îşkenceyan
Min ah ji dest wan xenceyan kok û kubar û dînberê



Aşkın ve sevginin vasıflarıyla o prensesin güzelliği
Beşer nakşı değil ki anlatmaya sığsın onun övgüsü

Ne güzeldir o inci gibi parlak yüz, o tatlı mest eden dili
O şeker dudaklı sevgili yoldan çıkarmış yüzlerce zahidi

Şeker var dudaklarında, reyhan var elmalar etrafında
Meşale var gecelerinde, parıltıları var fener renginden

Fener değil o, Hakkın nurudur, hüsün ve cemal-i Mutlak'tır
Parlak bir şimşek ve şafaktır, Zühre'dir, ışık saçan bir Güneş'tir

Zühre, Güneş ve Müşteri'yi onun nurlu yüzünde gördüm
Amber kokulu müselsel zülüfler ulaşmış Kevser havzına

Cennet köşesindeki havzadan bir çeşme akar kudret bahçesine
Her an süsler ve takılar tomurcuklanır o ardıç boylunun üstüne

İpek zülüflerle siyah kâkülleri dökülmüş nurlu ay yüzüne
İki emirin hâkimiyetinde olan o burcu gördüm ülke tahtında

O iki bey ve emirlerin tahtı tıpkı bir çevgan oynama alanı
İçip sarhoş olmuş o iki aslan mey dökmede kadehlere

Seherde el ele, sarhoş ve mestane, elde de mey kadehi
O iki meyperest öldürdü beni hançer darbeleriyle

Öldürdü beni hançer darbeleriyle, gamzelerinin mızraklarıyla
İşaret ve remizleriyle isabet eyledi kalbe pencere ortasından

Şimşekler çakar, gönüllere tecelli eden yârin güzelliğinden
Ondandır Tur dağı gibi yandığım, aşk ve sevginin nuruyla

Sağlam bırakmadı sevgin, yeniden öldürmede her gün beni
Her bir yanıma saplanan Kaçar okları kanlara buladı beni

O nazik ve latif yârin gamzeleri, o sevimli mızraktarın darbeleri
Saplanmış kalbe derinden, feryat o zalim dilberin elinden feryat!

Ne kadar insafsızdır, sormadı hiç halimizi bir kez olsun
Çok haksızlık etmede bize bildiği halde halimizi

Öldürmek istemede deprenmede gönlümde gecenin siyah yılanı
Saplamış ciğere mızraklarını, sarmış amberlerle saçlarının bağını

Bağladı kalbi pençeleriyle, işkenceler altında kaldı gönül
Ah o gonca güzeller elinden, şuh halleriyle dinden ederler



Remz û surên şîrînleban tîroj û berq û kewkeban
Rêza muselsel ‘eqreban geryan li dora qemerê

Min dî li dor bedra temam herfên di mektûb “dal” û “lam”
Wê pêşrewê batin revam yexma kirim sîmînberê

Sîmînbera neyşekkerê ew horiya nisbet perî
Bejna ji nûr dêma zerî bêhn ji gulav û mawerê

Bo mawer û şîrînlebê wê xub û nûrînxebxebê
Bedra di burca ‘eqrebê kengî ji ber perdê werê

Bedr e ji qudret lê du “nûn” ew qatila eswed‘uyûn
Pur rakirin wê qetl û xwûn ‘alem bir û yexmakerê

Her dem bi zulmê wê disojî qelbê ji hubba xwey tijî
Lazim dibêm min dê kujî kes nîne çîtin mehderê

Kes nîne ret mehder biket bes girtiyan ebter biket
Xemlê ji zêrê zer biket, şefqet biket li nik zîwerê

Şefqet bi dîdarê xwe ket qesta birîndarê xwe ket
Da bi herdu reşmarê xwe ket ê ser li qetlan muşterê

Fitlên siyehmarê şevîn axir bi selwî da xwuşîn
Terhan li dor serwa çevîn xef bûn di tayê çenberê

Xef bûn di nêv tora qizil îlanmîsalê ser li mil
Kuştîn û jehr avête dil hêj kuştiyên remza berê

Kuştîne em şîrînlebê tehlîkeşên roj û şebê
Ger ez bibînim bi xwe bê nakem ji dil hêj bawerê

Ew nazika nisbet gulê camek ji Kewser da **Melê**
Mest im ji ber qalûbelê hetta bi roja mehşerê

## 79

Latê husn î û şehê xûban î bi xwe hem xan î we hem xaqan î
Yûsufê sanî î îro xanim ku bi husna xwe nedêrê sanî

Bi sur û heybet û sehmê xwe perî wek te nînin ji butan sultan î
Bi tebilxaneyê şahî were texti ku îro şehê Kurdistan î

Kagulê berde bi ser xal û xetan ku muselsel binumî reyhanî
Ismê e‘zem te divê çil ismî ji du herfan bi mu‘emma zanî



O tatlı dudakların öldüren remizleri, yıldız huzmeleridir sanki
Art arda dizilmiş kâküller sarmışlar âdeta dolunay'ın etrafını

Dolunayın etrafında gördüm onları "dâl" ve "lâm" harfleri gibi
Alıp kaçırdı beni o rehber, yağmaladı beni ak göğüslü dilber

O ak göğüslü, ince boylu, peri ve huri güzeli
O nurlu endamıyla altın yüzü ve gülsuyu kokan güzel

Gülsuyu kokulu, tatlı dudaklı, nur gerdanlı güzel sevgili
Ey Akrep burcundaki Ay, ne zaman yırtacaksın perdeyi

Kudret eli iki nun işlemiş dolunay üstüne, o katil siyah gözler
Çokça kan döküp katliamlar yapıp yağmalamış âlemin her yanını

Her an yakmaktasın aşkınla dolu olan bu kalbimi
Şefaat edip kurtaracak yok mu, öldüreceksin en sonunda beni

Yok bize şefaat edecek, aşka esir olanları kurtaracak kimse
Yok artık bana şefkat edecek, altın süsleri sarartacak kimse

Şefkat et yüzünü görmek isteyene, lütfet aşkınla yaralanmış olana
Kurban et beni tüm öldürmelerin başını çeken zülfünün iki teline

Siyah yılanın büklümleri sonunda süzüldü selviden aşağı
Süslemiş güller selvi boyunca, gözden kaybolmuş örgüleri

Yılan misali omuzlarında gizlenmiş kızıl örgü ortasında
Kalbe zehir atıp öldürdü bizi, ölümümüz o ilk remizdendir

O tatlı dudaklıdan çekiyoruz aşkın acısını gece gündüz
Gözümle görsem onun geldiğini yine de inanmam buna

Gül kadar lâtif sevgili, bir kadeh sundu Kevser'den **Mela**'ya
Kalubeladan mahşere kadar mest ve sarhoşum onunla

## 79

Güzelliğin Lât'ı, güzellerin şâhısın hem hansın hem hakansın
İkinci bir Yusuf'sun bugün ey sevgili yok güzelliğinde bir ikincisi

Güzelliğinin cazibe ve heybetiyle ey peri güzellere sultan olsan sezadır
Tören eşliğinde gel otur tahtına, sultansın bugün Kürdistan'a

Kâkülleri sal benler üstüne ki görünsün müselsel siyah reyhanlar
İsm-i âzamı istersen kırk ismi iki harften muammayla bilmelisin



Çi berat bû we bi ser da kagulê çîn bi çîn mest bi tuxra danî
Tu Suleyman î husnê zî bera xatemek le'l e li gewher danî

Çi şikeste muselsel ya Reb ku tu pê nesix kirî dîwanî
Ger çi pur xal û Nîşanî emma bi nîşan ku tu bênîşan î

Ey perî horîsiriştê herçend ne beşer ne adem î û insan î
Surrê subhan te ji husnê dinumêt ehsenellah ji sura subhan î

Çi heddê 'eql e qiyasa te gerit ev e burhan ku tu bêburhan î
Me temenna ji nesîm xakê reh e da bikeyn dîde û dil nûranî

Nefesek bê te me [ne]anî billah ne tinê rûh î û can î û canan î
Sed hezaran ji te peykan di dil in lê li derdê me tinê derman î

Te birînên me kewandin dîsa ji nû agir te li daxan danî
Te **Mela** pir di ceger gezme ne lew we perîşan î û pirêşan î

## 80

Vê firqetê ebter kirîn feryad ji destê firqetê
Jar û zeîf û zer kirîn feryad ji destê firqetê

Pur zer kirîn wek zêri mam çavên û zulfê pîri mam
Daîm li rê çavnêr mam feryad ji destê firqetê

Çavnêrê reftara te bûm muştaqê gulzara te bûm
Lew dûr ji dîdara te bûm feryad ji destê firqetê

Dûr bûm ji wê reft û ç[û]nê ji wan 'işwe û guft û kenê
Nayê bi çavan min di dinê feryad ji destê firqetê

Dunya bi min mij bû xumam xew jî li çavan bû heram
'Umrî bi vî halî heram feryad ji destê firqetê

Sa'et li min têk sali bûn daîm li ser dest fali bûn
Herfên dihatin "dal"i bûn feryad ji destê firqetê

Îro tinê derhat "elîf" me'na diçû bejna şerîf
Ya xar e lê kemxe'w qedîf feryad ji destê firqetê

Vê firqetê dil li min şewand cerhên qedîm dîsa kewand
Şîşeyên sor datewand feryad ji destê firqetê

Daxên me dîsa reş kirin yek yek ji nû ateş kirin
Lê zêde penc û şeş kirin feryad ji destê firqetê



Bu ne berattır, üstünde halka halka kâkülü, mestane yazılmış tuğra gibi
Süleyman'sın sen, lal ve gevherden güzellik mühür olmuştur sana

Ya Rab, bu ne hatt-ı şikeste ki, müselsel yazmışsın onunla divanî
Benlerle nişanların çoksa da, bir nişanın yok Nişânî'nin yanında

Bedeninle beni-adem olsan da, huri tabiatlı bir perisin sen
Sübhanî bir cazibe var güzelliğinde bin maşaallah bin ahsen

Ne haddine akılın senle kıyası, bürhansız olman bürhanındır senin
İstedik sabadan gubâr-ı râhın serpip nurlandıralım gözümüzle gönlümüzü

Bir nefes yok bize sensiz billah sadece ruh u can değil, canansın da
Yüz binlerce okun var gönlümüzde, yalnız sensin yaralarımıza derman

Dağladın yaralarımızı yeniden ateş ve kor düşürdün üzerlerine
Ciğerinde çokça gamze var ey **Mela**, ondandır perişan olduğun

## 80

Uğursuzluk getirdi bu ayrılık bize, aman ayrılığın elinden aman
Hasta kılıp zayıflattı, sararttı bizi, aman ayrılığın elinden aman

Altın gibi sararttı beni beklerken zülfüne bağlı pirimin
Yollara takılıp kaldı gözlerim, aman ayrılığın elinden aman

Çıkıp gelmeni bekleyip durdum, arzuladım hep gül bahçeni
Uzak kaldım didarından, aman ayrılığın elinden aman

Uzak kaldım o salıp gezmesinden, işveli sözlerinden, gülüşünden
Gözükmez oldu gözüme dünya, aman ayrılığın elinden aman

Sisli ve bulanıktır dünya bana, haram oldu uyku da gözlerime
Bu hâldeyim işte bir ömür boyu, aman ayrılığın elinden aman

Saatler bir yıl oldu bana, kaldım elimde hep fal cetveliyle
"Dal" harfidir çıkan karşıma, aman ayrılığın elinden aman

Sevgilimin selvi boyunu gösteren "elif" çıktı falımızda bugün
Hareli ipek ve kadifedendir giysileri, aman ayrılığın elinden aman

Gönlümüzü yaktı bu ayrılık, deşti yine eski yaralarımızı
Kızgın şişler büküldü yaralarımda, aman ayrılığın elinden aman

Simsiyah dağlanmış yaralarımızı ateşle yaktı yeniden
Arttırdı acımızı kat kat, aman ayrılığın elinden aman



Sewda û sews û gêj kirim pir hêstir û xwûn rêj kirim
Çendan we bûm lê hêj kirim feryad ji destê firqetê

Billah ji nale'w zariyan gezmên di wan xummariyan
Xew nagerîn şevtariyan feryad ji destê firqetê

Şev bû di nêv çeşmên me da hetta beşîr mizgîn we da
Dê bê seher şahê geda feryad ji destê firqetê

Mizgîn ku da min ev qeder rûha şîrîn min hate der
Pêlek li min ron bûn beser feryad ji destê firqetê

Ron bû bi dîdara te dil bû xerqê enwara te dil
Naret ji ferwara te dil feryad ji destê firqetê

Minnet me dildarê xwe dî dîsa ji nû yarê xwe dî
Sultan û xwundkarê xwe dî feryad ji destê firqetê

Reşkagulê sunbul çevîn minnet me dîsa xem revîn
Lew bû li dil hubb û evîn feryad ji destê firqetê

Derdê xedar bêm firqet e firqet ji can pur zehmet e
Ya sehl ku 'aşiq rih det e feryad ji destê firqetê

Narê fîraq û sohtinê êşa xedenga nuhtinê
Pirs ken ji 'uşşaqan tinê feryad ji destê firqetê

'Aşiq ew in her dem mirin çendî ku di remzên dilber in
Keyber li dil min bihtir in feryad ji destê firqetê

Ya Reb bi dîdarê xwe key min wasilê yarê xwe key
Bes sotina yarê xwe key feryad ji destê firqetê

Me j'dost satek dûr nekey perkende û mehcûr nekey
Dîsan ji nû dil hûr nekey feryad ji destê firqetê

Axa riya dilber **Mela** bikşîn di çavan wek cela
Dîdar qismet bû hela feryad ji destê firqetê

## 81

Ey şehinşahê mu'ezzem Heq nigehdarê te bî
Sûreyê "Înna Fetehna" dewrê madarê te bî

Her kinarê pê ve wergêrî 'inanê himmetê
Zuhre bî peykê te û Kêwan rikêbdarê te bî



Serseme çevirdi bu sevda beni, kanlarla gözyaşları akıttı
Yeniledi yaralarımı, aman ayrılığın elinden aman

Billahi, inilti ve feryatlardan, o mahmur gözlerin oklarından
Uyku tutmaz beni kara gecelerde, aman ayrılığın elinden aman

Karanlıktı dünya gözümüzde müjde verinceye kadar müjdeci
Seherde gelecek âşıkların şahı, aman ayrılığın elinden aman

Müjde verince bana sevgili, tatlı canım çıktı bedenimden
Aydınlattı gözlerimi bir derece, aman ayrılığın elinden aman

Seni görmekle aydınlandı, nuruna gark oldu gönül
Senden ayrılmak istemez gönül, aman ayrılığın elinden aman

Şükür gördük maşuğumuzu, gördük yeniden sevgilimizi
Gördük hakanımızı, sultanımızı, aman ayrılığın elinden aman

Siyah kâküller, sümbül zülüfler, şükür ki sildi gamı kederi
Yenilendi kalpte sevgi ve aşk, aman ayrılığın elinden aman

Kanımca amansız bir derttir ayrılık, ölümden beterdir ayrılık
En kolayı âşığın can vermesidir, aman ayrılığın elinden aman

Ayrılığın ateşli yakışını, isabet eden okların acısını
Sadece âşıklara sorun onu, aman ayrılığın elinden aman

Âşıklar ölürler her dem, takılıp kalırlar dilber remizlerinde
Gönlümse bıçak yaralarıyla doludur aman ayrılığın elinden aman

Ya Rab rü'yet-i cemalinle vasıl eyle beni sevgiliye
Yeter beni yaktığın ateşinle, aman ayrılığın elinden aman

Bir saat bile kılma bizi dosttan ayrı, derbeder ve mehcur kılma
Gönlümüzü parçalama yeniden, aman ayrılığın elinden aman

**Mela**! Sevgilinin yolundaki toprağı sürme gibi gözüne çek
Nasip oldu kavuşmak sana, aman ayrılığın elinden aman

## 81

Ey yüce şahlar şahı, Hak koruyucun olsun senin.
"İnna fetahna" suresi çevrende surun olsun senin

Hangi yöne dönersen dön himmet seninledir
Zühre yıldızı elçin, Zühal hizmetkârın olsun senin



Daîma menzilgeha sûra te bit burca şeref
Tali‘ê ferxende û bextê se‘îd yarê te bî

Seb‘eyê seyyare û neh çerxê sergerdan bi vê
Girdiş û dewrê ‘eceb der xizmet û karê te bî

Mahitaba dewletê yek pertewek şem‘a te bit
Afitaba ref‘etê berqek ji enwarê te bî

Lami‘a fetha ezel berqê ji ber tacê te det
Kewkeba Se‘da ebed necmek ji seyyarê te bî

Berqê subbûhî ku işraqê li sed canan didet
Ew ku keşfa dil diket remzek ji esrarê te bî

Rayeta fethê ji nesra te her menşûri bit
Şehsiwarê ferrê subhanî ‘elemdarê te bî

Ney tinê Tebrîz û Kurdistan li ber hukmê te bin
Sed wekî şahê Xurasanê di ferwarê te bî

Ger çi der iqlîmê rabi‘ hate textê seltenet
Padişahên heft iqlîman selamkarê te bî

Çîmena sultaniyê yek laleyek baxê te bî
Gulşena xaqaniyê xarek ji gulzarê te bî

Ê ji emrê te’y mukerrem serkeşî ket şibit şem‘
Ser borî tîxê te û meqtûlê mûkarê te bî

Şahibaz er çendî perwazê bi balayê [d]iket
Nê di nêv [t]ora te û dê seydê şunqarê te bî

Şîrê pir heybet didêrit pir bi sehmê zêdeyî
Sa‘eta xeflet xweya bî dê kerê barê te bî

Her serê dewlet heyî dê her di nêv benda te bî
Her kesê ‘aqil bitin dê her ricukarê te bî

Ê divê azade bit dê çavnêrê lutfa te bî
Her kê istixna di dil, li bin minnet û barê te bî

Her kesê qestek di dil dê qest dergahê te ket
Ê di xatir ercûwek bî her rucakarê te bî

Ê ne dewletxwahê hezret bit ji nêva can û dil
Şubhetê ehlê şeqawet qehrê azarê te bî



Düğün ve ihtifallerin Şeref burcunda yapılsın daim
Mutlu talihle bol şanslar yaverin olsun senin

Durmadan dönüp dolaşan yedi gezegenden her biri
Hizmetinde el pençe divan dursun senin

Devlet mehtabının ışığı, mumunun bir parıltısı olsun
Yücelik güneşi, nurunun bir şulesi olsun senin

Ezeli fethin şimşeği, tacından parlayıp çaksın
Ebedi saadet yıldızı, gezegenlerinden biri olsun senin

Sabah şimşeği ışığıyla aydınlatır yüzlerce canı
O ki gönülleri keşfetmede sırlarının bir remzi olsun senin

Fetih bayrağın zaferle dalgalansın daima
Görkemli kahramanlar bayraktarın olsun senin

Tebriz ve Kürdistan taht-ı hükmüne az gelir
Yüzlerce Horasan şahı hizmetkârın olsun senin

Taht-ı saltanatın dördüncü iklimde olsa bile
Yedi iklim padişahları selamdarın olsun senin

Sultanlık çimeni bağının bir lalesi olsun
Hakanlık gülşeni gülzarının bir dikeni olsun senin

Yüce emrine baş kaldıran her bir kişi mum misali
Kılıcınla kellesi uçsun, parça parça olsun önünde senin

Çok yükseklerde sağa sola uçup dursa da doğan kuşu
Sonunda tuzağına düşüp kartalına yem olur senin

Heybetleriyle âleme korku salan aslanlar
Ansızın göründüklerinde yükünün eşeği olsun senin

Devlet ve saadet isteyenler ipine tutunsun sımsıkı
Akıl ve idrak ehli olanlar ricakârın olsun senin

Özgür olmak isteyenler lütfunu gözetlemeli her dem
Müstağni de görse kendini her kim, minnettarın olsun senin

Gönlünde bir arzusu olan her kişi dergâhına sığınıp
Akıl sahibi kimseler her daim rücûkarın olsun senin

Kim ki istemez canıgönülden saadetli devletini
Şakiler gibi inleyip dursun pençesinde kahrının senin



Ma bi ‘îş û noş şahî ew qeder ‘umrê te bit
Çendekê salik di dewrê bêniyet ber karê te bî

Her kesê ne j’dil du‘ago û senaxwanê te bî
Girtiyê qeyda te û armancê nûbarê te bî

Medrekê ‘ilmê zemîrê şemmeyek wesfa te hat
Wer ne kî ‘alem bi şe’n û qedr û miqdarê te bî

Qest û daxwazik **Melê** daîm ji can û dil ev e
Her di benda xizmetê pêşdestê dîdarê te bî

## 82

Xanê xanan lami‘ê necma te her purnûri bî
Keştiya bextê te j[i] bayê muxalif dûri bî

Kewkeba se‘da şeref tali‘ di nêv burca te bit
Da tinê j’çerxê bala şibit mehê menzûri bî

Encumê çerxa mucedded her ji zatê te’y şerîf
Kesba nûrê [d]ikin hetta ku nefxa sûri bî

Her ziyaret asitanit bêt şemsa dewletê
Da sehergahan ji dîdara şerîf purnûri bî

Extera te j’perdeya xeybê eger bêtin zuhûr
Dê bibi nisfinnehar û ret şeba deycûri bî

Her kinarê wergerînî pê ve ‘ezm û himmetê
Bê nihayet pur murad û bê ‘eded mensûri bî

Ayetulkursî û En‘am heykela canê te bin
Rayeta fethê bi nesra lem yezel menşuri bî

Xîmeya nûrê ‘inayet zillê memdûda te bit
Sûreyê “Ummilkitab” madarê hezret sûri bî

Paşê Newşîrwan dibêm her hakimê ‘adil tu yî
Mislê Hatem dê bi danê der cihan meşhûri bî

Ma Cizîrê şubhê darê textê heft iqlîm bit
Da bi hukm û seltenet Eskender û Fexfûri bî

Mislê Cem cama zerîn xalî nebî te j’badeyê
Da ji xemra şadimanî daîma mexmûri bî



Saadet ve mutluluk içinde geçen ömrün bundan mı ibaret
Seyrü sülûkte birçok salik, emrine amade olsun senin

Her kim senin gönülden duacın ve senakârın olmazsa eğer
Oklarının hedefi olup esiri olsun kaydının senin

Bir nebzedir ancak bu anlattıklarımız sıfatlarından
Âlem nasıl ulaşsın ki yüceliğine kudretinin senin

Dileği oldur ki canıgönülden her daim **Mela**'nın
Hizmetinin esiri olup, didarına mazhar olsun senin

## 82

Ey hanlar hanı her daim nur saçsın yıldızının parıltısı
Ters yönden esen rüzgârlardan uzak kalsın bahtının gemisi

Ebedi mutluluk veren talih yıldızı, arasında bulunsun burcunun
Ta ki, bela semasında herkesce beklenen Ay olasın

Dönen gök kubbedeki yıldızlar senin şerefli zatından
Alsın nurlarını ta sura üfürme gününe kadar

Eşiğini ziyarete gelmede devlet güneşi
Ta ki şerefli yüzün daha çok aydınlatsın seher vaktini

Gayb perdesinden zuhur edip görünse yıldızın bir defa
Zifiri karanlık geceler gün ortası aydınlığına dönüşür mutlaka

Bu azim ve gayretle yönelmek istediğin her tarafta
Sayısız kere galip gelip ermiş olasın muradına

Ayet-el-kürsî ile En'am suresi canına iskelet olsun
Zafer bayrağın dalgalansın Allah'ın yardımıyla

Dileriz Allah'ın inayet nurunun çadırı gölge olup korusun seni
Koruyucu bir sur olsun meclisinin etrafında Fatiha suresi

Sensin derim en adil padişah Nuşirevan'dan sonra
Dilerim yayılır ünün cihanda Hatem gibi ihsan ile ikramda

Yedi iklimin tahtı gibi mi olsun Cizre ülkesi
Dilerim İskender ve Fağfur olursun saltanatında

Boş kalmasın altın kadehin badeden Cem gibi
Mutluluk şarabıyla mahmur olasın daima



Ma di baxê ‘îş û noşê her bi sazê erxenûn
Kamiran û kamibexş û dilxweş û mesrûri bî

Çendekî şîrînpuser der bendê peywenda te bin
Bendê şapûra te bin da Xusrewê Şapûri bî

Hindekî roj û şev in têk ‘îd û Leylilqedri bin
Cam medam pur bade bî lê ne j’meya engûri bî

Şubhetê Rûhuilqudus ‘erdê tu pê lê dayinî
Sebze û reyhan û nesrîn û gula men[q]ûri bî

Her derê ne‘la feres şubhet Buraqê vê kevit
Çeşmeyê heywan ji wî ‘erdê mubarek fûri bî

Ma te ‘umrî Xizr û Nûh û mulkê Zulqerneyn bitin
Gunbeda çerxê mulemme‘ her bi te me‘mûri bî

Xassê teşrîfa te bin derbend û deryayê ‘Ecem
Da xelatên her seher sed zerkeş û mexmûri bî

Ger çi der dîwanê hezret pur heqîr în şibet mûr
Çeşmê min çeşmê Suleymanî li halê mûri bî

Ê ne wek go bê ser û pa bit di benda xizmetê
Ma bi çewganê te her perkende û meqhûri bî

Ma lîsanê min du‘agoyî li derheq wesfê Xan
Mezherê sirra kelamê wek direxta Tûri bî

Her di medhê te senaya sîne û qelbê **Melê**
Bêtefawut qulzema purlu’luwê mensûri bî

J’asitana dewletê xaib nebî carek **Mela**
Da ji fermana mukerrem dem bi dem me’mûri bî

## 83

Derheq me feqîrê xwe meke teqsîrê
Nabit li şuxula te min te’xîrê

Tuxrayê humayûn ku diken turreyê emr
Zulfa te ye anî ji xeta tehrîrê

Husna te nizanim bi çi teşbîhi bikem
Ev ehseni teqwîm lew hatiye tefsîrê



İşret meclisi bahçelerinde çalgılarla geçen bir hayat yetmez sana
Hep gönlü hoş, mutlu ve mesrur olup kâm alasın daima

Tatlı erkek çocuklar hizmetinde hazır olsun divanında senin
Ta ki Şapurlu Husrev dahi kemendine bağlı olsun senin

Gece ve gündüz, tüm zamanlar bayram ve Kadir gecesi olsun
Bade ile dolu olsun kadehin daima, lakin üzüm şarabı dışında

Ruhu'l-kudus gibi bastığın her bir toprak parçası yeşillenip;
Reyhan, yaban çiçekleri ve güllerle dolu bir bahçe olsun sana

Burak misali atının ayaklarının değdiği her bir yer
Abıhayat fışkıran kutlu bir çeşme olsun sana

Sadece Hızır'la Nuh'un ömrü, Zülkarneyn'in devleti yeterli mi?
Parıltılı yıldızlarla süslü gökyüzü her daim mamur olsun seninle

Acem Denizi ile Acem Boğazı teşrifine hediye olsun senin
Ta ki, her seher yüzlerce altın işlemeli giysilerle mahmur olasın

Gerçi hazretin divanında karınca gibi degersiz isek de
Gözlerim Süleyman'ın gözlerini gören karınca gibi olsun

Başı ayağı olmayan bir goy (top) gibi hizmetinde olmayan
Çevgân sopasının önünde parça parça olup kahr olsun daima

Dilim duacıdır sadece vasıflarını methetmede Han'ın
Tûr-i Sina'daki ağaç gibi kelâmullah sırrına mazhar olasın

Seni övmekle dalgalanmakta **Mela**'nın sinesiyle gönlü
Saçılmış incilerle dolu denizden farksız olasın

Bir kez olsun uzak kalma saltanat eşiğinden, ey **Mela**!
Ta ki yerine getiresin an be an şerefli emrini padişahının

## 83

Bir an olsun bu düşkününü ihmal etme
Zira senin emrini yerine getirmeyi ertelemem

Sultanın fermanını mühürleyip gösteren tuğra-yi hümayun
Senin zülüflerindir getirip mühür yaptıkları yanlışlıkla

Neye benzetip anlatsam güzelliğini bilmem ki
Çünkü bu ahsen-i takvimle güzelliğinin tefsiri olmuş



Surra te li dêm ayetê kubra ye neşêm
Lê neql û riwayet [d]ikerim tefsîrê

Ger qelbê heqîqet niye yekcari çira
'Işqa te kirin zêr û zeber iksîrê

Ma qudretê def'ê dibit er Şêrê 'Elî bit
Lami' ku bidet sa'iqeya teqdîrê

Bê qudretê tu quwwetê mexlûqi çi ket
Memnû' e li nik 'eql diket te'sîrê

Ney bestê tilismê me bi sed xane biret
Ismê te di dil da ku bikem tekebburê

Remzek te tinê bibête beyanê bi zeban[28]
Qadir heye 'arif bekirit teqrîrê

Ber ber, ber û leb ber leb û endami lêk
Xewna me bi yarê [bidinê] te'bîrê

Zerratê wucûda me sebeb wê tu dizanî
Naête hisabê feleka tedwîrê

Ateşperesê warê 'işqên û 'eceb
Dînarperes û wê dibene tekfîrê

Mihraba du birhên te ne[bîn]it 'arif
Nabit ku bi çi bit di dema tekbîrê

Zanim te çi mizraqi vi dil keftiye lê
Carek dikevî hêj ji derba tîrê

Teqdîri ku hukmê li **Melê** carî ket
Qet kes heye mumkin bidetê texyîrê

## 84

Sed Çîn di xwe da girtine zulfa biçîn[29]
Şi'ra me di heq te lew çû heta [Ma]çînê

Neqşên felekan guh diderin vê nezmê
Tenha ne beşer her dikerin tehsînê

---

28 Ev beyt di nusxeyên dî de nebû.
29 Di vê nusxeyê de beytek di seri de kêm hatiye.



Anlatamam yüzündeki mucize-i kübra olan güzelliği
Ben ancak bu tefsirin nakil ve rivayetlerini anlatabilirim

Tersine çevirme doğru değilse eger hakikatleri
Neden aşkının iksiri bir defada alt üst etti bizi

Kimin gücü yeter, Allah'ın arslanı Ali dahi olsa
Kim dayanabilir mukaddirin takdiri parladığında

Kudretin olmadan mahlukunun kuvveti ne yapsın
Aklen muhaldir mahlukun bir şey üzerindeki gerçek tesiri

Anlaşılması güç tılsımlı hesabımız yüz haneye ulaşmışsa
Senin yüce ismini gönülde daha nasıl yüceltebilirim

Senin bir tek sırrın lisan ile beyana gelse
Arif olanların bunu ifadeye takati olabilir mi?

Dudak dudağa, diz dize bütünleşmiştik dilberle
Gelin de yorumlayın dostlar sevgiliyle olan bu rüyamızı

Gerçekte ancak sen bilirsin yaratılış amacımızı
Hesaba sığmaz çünkü dünyanın işleriyle tedviri

Ne gariptir ki, aşk vadisinin ateşperestleri olan bizleri
Paraya pula tapan dünyaperestler tekfir etmede

Kaşların arasındaki mihrabı görmezse arif olan
Anlayamaz tekbir anındaki niyetin makamını

Bilirim nasıl bir mızrak sapladığını gönlüme
Okların hedefi olmuşsun artık bir kere

Allah'ın **Mela** hakkında cari kıldığı takdiri
Değiştirmeye güç yetirecek kimse var mı ki

## 84

Yüz Çin ülkesi saklıdır zülfündeki düğümlerde
Ondandır senin hakkındaki şiirimiz ulaşmış tâ Maçin'e

Şiirimizi beğenenler insanlar değil sadece
Gökteki yıldızlar da bu nazmımıza kulak vermede



‘Işqê ji Xudê da tu bixwazî jê ra
Ger dê tu li yarek xwe bikey nefrînê

Yek secde tinê ferz e di dînê ‘işqê
Bin ber qedema yarê mecalê dînê

‘Aşiq ku bi dil Fatiheya ‘işqê xwand
Ayat yekayek digerin amînê

Me ji le‘lê lebê yarê xwe vexwar abê heyat
Exyar bilan têk biçin Darînê

Lazim bi xwe ayineyê Rûhulqudus î tu
Lew kes nedîn horî bi vê ayînê

Min heysilbeşer dî bi te nisbet berden
Bêhn û şefeqa nazikiya nesrînê

Evreng fesahet ji beşer sihrê helal
Î‘cazê beyan aniye ber tedwînê

Da nale û ahên me ji dil seh bigerî
Wer guh bide hindavê serê balînê

Firhad dizanit tu ji Perwîz mepirs
Etwarê xemê ‘işq û sura Şîrînê

Bênuqte nihin daîre îhsan ke **Mela**
Dewarê çi diket daîreya tekwînê

## 85

Ey şahidê qudsî veke bendê ji nîqabê
Ta çend we sergeşte bimînîn di hîcabê

Biskên ji herîrê tu ji nû mawerê lê ke
Zulfên ji ‘ebîrê şe ke bavê xem û tabê

Qiştên ji xwe çîn çîn bide ber misk û zubadê
Tayên di ‘îsabê bireşînin bi gulabê

Her yek bi hezar reng li bejna te sema tên
Xemrî û lef û şitrî û tayên di ‘îsabê

Min can yedê beyza ye ji ‘Îsa çi xeber dem
Min ateşê Mûsa diye gulnarê şerabê



Düşmanına bir kötülük yapmak istersen eger
Aşk hastalığına düçar eylemesini dile Allah'tan yeter

Tek bir secdedir sadece farz olan aşk dininde
Ayağına kapanın secdeyle onu her gördüğünüzde

Âşık okursa eğer, aşkın Fatihasını gönülden
Tek tek amin der Kur'an'ın diğer ayetleri peşinden

Sevgilimizin dudağından içtik biz abıhayatı
Varsın rakipler Cehennem'i boylasınlar hep beraber

Ruhu'l-Kudüs'ün tecellisine mazhar bir aynasın şüphesiz
Görmemiştir kimse çünkü bu tarzda bir huriyi

Beşer olman hasebiyle caizdir senin için
Nesrin gibi beyaz, latif ve kokulu olman

Böyle bir fesahet sihr-i helaldir beşerden
Böylesi mucizevî bir beyan dökülmüş mü kaleme

Dinlemek istersen gönülden gelen ah ve eninlerimizi
Gel de kulak ver şu başucumdaki yastığa

Perviz'e sorma sakın, Ferhat bilir ancak
Aşk gamının hâlleri ile Şirin'in cazibesini

Ey **Mela**! Noktasız değildir hiçbir daire, iyice düşün
Sahipsiz nasıl dönüp durabilir ki bu çarkıfelek

## 85

Ey yüce sevgili! Çöz nikâbının bağını görelim cemalini
Ne zamana dek şaşkın kalacağız böyle görmekten seni

Gül suyu serp yeniden ipekten kâküllerine
Tara amber kokulu zülüflerini, çözüp salıver yüzüne

Halka halka perçemini miske bandır ey sevgili
Gül suyu serp yüzüne düşen saçlarını bağlayan tellerine

Kızıl peçeler, omuzlara düşen örtülerle, boynundaki takılar
Bin bir renkte raks etmede nazik endamında her biri

Yed-i beyzadır bedenim, İsa'dan haber vermeye ne hacet
Musa'nın ateşini gördüm, nar çiçeği rengindeki şarapta

